BERXWEDAN

TÊDAYÎ



**Berpirsîyar**

SERXWEBÛN
Postfach: 10 16 83
Neusser str 13
5 KÖLN 1

***Xwendevanê Hêja;***

***Berxwedan, ku hejmara dawî di meha Tirhemê 1983an de hatibû weşandin, bi vê hejmarê, nivîs û agahîyên nûh dîsa dighîje destê we.***

***Berxwedan, ji bo kovareke hêja bighîjîne destê xwendevanan, xebatê zor giran dimeşîne, her çuqas di ev mehên werin de demderbasî çêbibin jî, di wê bawerîyê de ye ku ev karûbarê giran wê bighîjin armancên xwe.***

***Berxwedan bi alîkarîya we bihîm dibe; em Berxwedan bixwînin, bidin xwendin û bi name û nivîsan alîkarıyê pêre bikin.***

Berxwedan
Sebat 1984

*Di Dawên PKK de*

# BİRYARA 145 BİDARVEKİRİNÊN DİN!

Di dadîngahên mêtingerên faşîst dihat dîtin dawên PKK de, li gel ji alîyê dadîngahê biryara 62 bidarvekirinan hatin girêdan, du dawên din de biryara 145 bidarvekirinên din jî hate xwestin. Bona diliyên şer yên PKK hê di destpêkê de biryara mirinê eşkere dikin, di dadîngahên mêtingerên faşîst yên cunta de, payhev daxûyankirin kirin û xwestina biryarên bidarvekirinan, hercarê ji hêla dîliyên şer yên şoreşger û girsên gel, bi protesto û şiaran tên lihember derketin.

Hêsîrên şer, yên di eywana dadîngahê de, girêdana xwe bi partî û gel re bê tirs qêrin dikin, di dadîngah û girtîgahê de li hemberê hingavtin û pîkolîyên tim zêdetir dibin de, şanî kirin ku şopkarên mêrxas a serpêhatîya berxwedana PKK ne û dibêjin; cezayên mirinê, hingavtin û lêdan ji hêla kesên bo mafên xwedî rûmet û xwedî heq tekoşîn dajon re, rastî ev tewrên hana ispatên dîyarin ku çawa dijmin binkeftin dibe, har û dîn dibe ye.

Çend mehên talî de, di dadîgahên qolonîalîstê faşîste de dihatin dîtin dawên PKK de, biryarên daxûyan bûn wûsa ne:

## Dİ DAWA PKK A BATMANÊ DE 84 BİDARVEKİRİN TÊN XWESTİN!

Di dadingaha leşkerî a bin serleşkerîya girêdana awarta qolordîya heftemîn de, sekne dibû dawa PKK a Batmanê de, bona 84 kesan 155 caran bidarvekirin tê xwestin.

Di dawa PKK a Batmanê ku li Dîyarbekir tê dîtin de, 313 kes hene. Kesbûna, 84 mirovên derheqê wan de bidarvekirin tê xwestin hêj baş dîyar nebûye.

## DAWA PKK-HÎLWAN Û SÊWREKÊ A TALÎ DE 61 BİDARVEKİRİN TÊ XWESTİN!

Di dadîngaha leşkerî li Dîyarbekir tê dîtin, dawa PKK a Hîlwan û Sêwrekê de, dadgerê leşkerî ji 108 kesan derheqê 61 kesan de biryarê darvekirinê xwest.

Di sekna 20ê kanûnê 1983an de çêbû de, dadgerê leşkerî îddîanama ji 18. kanûnê xwend û derheqê 61 kes, bidarvekirin daxwaz kir. Kesên derheqê wan de bidarvekirin tê xwestin evin: İsmail Ahnaz, Celalettin Ahnaz, Lami Agirman, Kemal Aktaş, Ali Agirman, Mahmut Aydin, Ahmet Altinyüzük, Halil Ağiraç, Mahmut Agıraç, Veli Agiraç Abdulkadir Atim, İzzet Baykal, İrfan Babaoglu, Ramazan Çat, Mehmet Çat, Ali Çobanyildiz, Nurettin Çatlak, Hasan Demir, Celalettin Delibaş, Eyup Demir, Mustafa Delen, Abuzer Dehşet, bozan Gultekin, İrfan Güler, Ramazan İlhan, Mehmet Kancak, Hamit Kandal, Muzaffer Kevci, Salih Dodanli, Mehmet Dodanli, Bekir Dodanli, Mehmet Dodanli, Seydi Dodanli, Abdulkadir Dodanli, Hasan Man, Kadir Manav, Salih Ogaç, İbrahim Halil Öcal, Ramazan Ödemiş, Fuat Ökten, Suleyman Pertav, Mehmet Sabali, Halil Kayan, Ramazan Ülek, Fevzi Yetkin, Mustafa Yetkin, Guli Basmaci, Saadettin (Sadun) Sevgat, Mustafa Yüksekyayla, Remzi Geyik, Osman Gültekin, Budak Karamanli, Kazim Kiliç, Celal Kiliç, Ali Kiliç, Cevher Kandal, Emin pertav.

Di îddîanama dadgerê leşkerî ku ji 49 rûpelan pêkhatibû de, bilî wan di derheqê 24 kesan bi kêmasî heryek 11 sal, derheqê 15 kesan navbera 5 û 10 salan, derheqê 8kesan navbera 3 û 5 salan ceze girtî hiştina giran hate xwestin.

## DAWA PKK A ELEZÎZÊ DE 6 KES CEZAYÊN GİRTÎMAYÎNÊN BABETÎ GİRTİN

Dawa PKK a Elezîzê ku li dadîngaha leşkerî a girêdana awarte Elezîzê de dihat dîtin de, 6 kes cezayên babetî girtin. Dawa bi 16 kesan de, 10 kes ji ber kêmasîyên delîlan hatin berdan.

Mîna ku sereketîya girêdana awarte dîyar kirî, kesên derheqê wan de ceza hatî dayîn, evin:

Engin Karaaslan 13 sal 4 meh, Mahmut Aker 5 sal 6 meh 20 roj, Muharrem Karagul 3 sal 8 mih 13 roj, Nuri Işik 6 mih 20 roj, Turgay İşik 6 meh 20 roj û Mehmet Özçelik 5 sal 6 meh 20 roj.

Di vê dawê de "berbidadîngeh dibûn": Devrim Akdeniz, Ertan Karagöl, Akman Gedik, Hasan İşik, Abdurrahman Yildirim, Hayrettin Kiziltaş, Mehmet Bilir, Huseyin Yuce, Mehmet Bingöl û Yakut Bingöl, ji ber kêmasîyên delîlan hatin berdan.

## DAWA PKK A QERSÊ DE DU KES, CEZAYÊN GİRAN GİRTİN!

Dadîngaha leşkerîya yekemîn a girêdana awarta qolordîya nehemîn de tê dîtin, dawa PKK a Qersê de du kes heryek 6 sal û 8 meh, cezayên giran girtin.

Bi bawerîya ku li dora Qers û Ardahanê propexendekirine, endamê PKK ne, ceza kesên girtin evin: Selahattin Yavuz û Kerem Akbaş.

*Ev nivîs, sedemê rojîya mirinê ya di 2. Êlûnê 1983an de hatibû destpêkirin, hatibû nivîstin. Ji ber ku rojîya mirinê, a ji hêla hêsîrên şer yên PKK ve di meha Çile 1984an de hatîye destpêkirin manake din nagre, me weşandina vê nivîsê licih dît.*

Berxwedan

# ÇİMA ROJÎYA MİRİNÊ?

Di bin hemû pêkanînên nemirovî, hov û zerpên dijwar, êrîşa qolonyalîstên Tirk de, nexasim di bin nîrê pêkanînên van sê salan de, ku hêza qolonyalîst binxistin û temirandina berxwedanê daye pêş xwe, bê guman di van hoyên dijwar de, bê rawestandin, tewr û hêza berxwedanî pêş ketîye û bilintir bûye.

Bi ve rewşa eşkere li hember hemû dijwarî û pêkanînên hêza qolonyalîstan, girtixana Dîyarbekir bûye, bircek bilind û bendeka bi hêz.

Hêzên qolonyalîst, karbidestên faşîst li pêş hemû nemirovî, hov û pêkanînên xwe yê dijwar, şervanên PKK hember xwe rawestandî dîne. Û bi tewrên berxwedanî, tekoşîna şoreşê bilind kirine. Li ber hemû dijwarîyan, bi canfidaî û wundabûnên giranbiha tewrê xwe domandine, û di vî alî de sistî nîşan nedane.

Di vê pêvajoya hêza qolonyalîst serdestxistina serxwerîyê amanc kirîye, berxwedanên PKK ji bo pûçî û betalbûna amanca qolonyalistan û ji bo pêşxistina tewrê berxwedanê canê xwe danîne holê. Û di hoyên dijwar de tewrê şoreşgerî di girtixanan de serdest kirine, leystik û destikên dijmin betal hiştine. Bi berxwedan û tewrên bê emsal ji, girtîxanên Dîyarbekir bûne birca gelê me, hember qolonyalîstan rawestîya ye.

Xeleka van berxwedanan bi daxûyankirina şervanê PKK, Celalettin Delibaş di 1ê Êlûnê de bi biryarî hatîye aşkerekirin ku; li hember pêkanîn û amanca qolonyalîstan welew bibe sebebên cangorîya şervanên hêza jî, girtîyên girtîxanê dest bi birçîbûna mirinê bikin û vî tewrê berxwedanê bidomînin.

● Ev tewrê berxwedan û biryarê kirina rojîyê, ku ji 2ê Êlûnê ve didome, laqayî bîranîna birçîbûna 14ê Tirmeh 1982a ku destpêkir û 8ê Êlûnê bi domandina 55 rojan gihiştibû dawîkê dibe. Bi daxûyana hogirê M. Hayi Durmuş ev biryar daxûyan bûbû. Di bin hingavtin û lêdanên dijwar, û rewşa mirina birçîbûnê de gelê Kurdistan sê lawên xweyê hêja wundakiribû. Di vê rojîya mirinê de Endamê Komîta Navendî M. Hayri DURMUŞ, Kemal PÎR û şervanê PKK Akif YİLMAZ di vê birçîbûna 55 rojî de şehîd ketibûn. Bi dehan şoreşger û şervan jî ketibûne rewşa ber mirinê.

Di wê pêvajoya ku hemberê karbûna PKK hêza qolonyalîst li nav welat û di girtixanan de bi pergalên êrîşî, tevger girêda ku serxwarîyê li hember vê pêşketinê serdest bixîne, pêkanînên xwe yê girtîxanan dijwartir domand, ji bo amanca hêza qolonyalîst bingeh negre, û pêkanin û amanca qolonyalîstan li ber pêkanin û amanca şoreşgerî betal û pûç bibe, aşkere di daxûyana hogir M. Hayri de jî zalale, ku şervanên PKK canê xwe di bin hemû dijwarîyan de li ser destê xwe girtine û hebûna xwe danîna holê. Ku amanc û pêkahtina serxwarîyê, di girtixanan û nav gel de cih negre, tewrê berxwedanî bikemile, li hember dijmin tekoşîneka bê emsal afirandine.

Ev berxwedana ku laqayî salewexta berxwedana hogirên M. Hayri DURMUŞ, Kemal PÎR hwd. daxûyan bûye, bi hemû taybetên xwe aşkere ye ku berxwedana van hogira bi berxwedanê hatîye domandin û bilintir bûye. Û bûye nîşana bîr û bawerî û hebandina rêça şehîdan. Bi vê berxwedanê ji aşkere ye ku di rewşa kuştina rêbera û bê rêber ji bimînin, şervan û bîrewerên PKK bê sistî û bê dudilî tekoşîna berxwedanê hember dijmin domandina rêça ronakrewanên rêber, Mazlum, Hayri, Kemal, Akif hwd. ranawestînin.

Mirina rojîyê di vê rewşa ku dijminê qolonyalîst di pêvajoya "demokrasi" û "hilbijartinê" kirasên derewin li xwe dike, hemberê pêkanînên girtîxanan ku dijwartir bûn, li dijî van yekan pêkhatîye.

Dijminê qolonyalîst di karbûna derbasiya "demokrasiyê" de kirasên derewîn û rûreşiya xwe didomîne û ji bo girtîyên êsîrê destê xwe ferman û karê bidarvexistinê û hingavtin û lêdanên ser girtîya zûtir dike. Bi van pêkanînên lez û bezî van pêkanînên nemirovî û hov ji karbidestên sivil re nahêle. Li ser pêkanîna vê amancê bi lez û bez ji dadigehan biryarên bidarvexistinê derdixe. Di vî alî de ji bo girtîyên PKK hetta neha derheqê 54 şervanan de biryarê bidarvexistinê derxistîye. Lê, dijminê qolonyalîst tesîra bidarvexistina başdizane. Ji bo vê tirsê ye ku bidarvexistina 54 kesan nade berxwe. Lê kuştina yek-biyekî dide pêşîya xwe. Şervanên derheqê wan de biryar ku hatîye sitendinê ji hev parvekirîye û wan yeko-yeko di "hücran"de têdixe binê hingavtin û lêdanê, ev taybet bi hemû rengan daxûyan dike ku, ev amanc amanca hêza qolonyalist e.

Ji alî din ve tesîra bidarvexistinan li ser gelên cîhanê pêktê, ji bo ev yek ne afire, rêya kuştina veşarî ji xwe ra pêwîsttir dibîne.

Lê, bi berxwedana birçîbûna mirinê, bi tevgera şervanên PKK ev amanca rûreşî derî holê bûye û li hember vê amancê benda rawestandinê hatîye vegirtin.

● Li hember rewşa girtîxanan, pêkanînên ser girtî û malîyên wan û li dijî pêkanînên dijmin ku dixwaze tesîra berxwedan û tewrê girtîyan û tesîra fermanên bidarvexistinan li nav gel de bişkine, rojîya mirinê li dijî van yekan pêkhatîye. Ku ji nas û malîyên girtîyan ta girseyên gel bi hûr-bijarî li ser rewşa û pêkanînên girtixanan û girtîyan disekinin û di nav vê rewşa dijwar de piştgirtina vê hêllê roj-biroj bihêz dibe. Ji ber vê pêşketinêye ku dijminê qolonyalist zerp û êrîşbazîya ser gel dijwartir dike, hemû destik û pêkanînên xwe ji bo serdestxistina xwesiparîyê bikartîne.

Êsîrên şerê serxwebûnê, di hoyên dijwar da bin jî, bê rawestandine. Him li hember pêkanînên hemberê xwe, him ji di rewşa girtîtî de li dijî pêkanînên ser gel radiwestin. Û ev yek hevgirtin û piştgirtinê bihêztir dike. Taybetê destpêkirina rojîya mirinê gellekin û yek ji van jî ev e, ku li hember karbûna PKK li hêlên welat ber bi bingeh avayîve diçe hêza qolonyalist bi harî êrîşbazîyê li dijî vê karbûnê dimeşîne. Rojîya mirinê xwedîyê taybetê dijberîya êrîşa dijminê qolonyalîste û di vî alî de berxwedaneka pêwiste.

Mîna di 25ê Gulanê de aşkere bû, hêza qolonyalîst vê amanca xwe bi êrîşa Kurdistan a Başûr aşkeretir kir ku, binxistin û tunekirina PKK jê ra amanca yekemîne, di vî alî de bi gellek

*(Dûmahîk di rûpelê 38an de ye)*

# MA GELO SAZÛMANA ÖZAL MAL Jİ AGİR DİREVÎNE?

PARTÎYA Turgut Özal 6. Mijdarê, bêyî mirov bawer dikir, hilbijartinan de serkeft û 7. Kanunê sazûman ji qabîna Bulent Ulusu, ku rejîma 12. Êlûnê a pêşemîn bû, girt.

Mîna me li jor jî xuyanî kir, serkeftina ANAP (Partîya Niştimanî) bi pêşhêjmareke bilind, nelîhevhatinek bi plan û xebatên cunta yên berî hilbijartinan de dikir, daxûyan dike; serekên cuntayê yên ku bi zora leşkerî û rêzanî, hêldidin jîngarîya civakî, ji ber ku giranîya xwe bo alîkarîya MDP (Partiya Demokrasîya Nasyonalist) danîbûn, mirov bawer nedikir ku wê hilbijartin wûsa dawî pê bêtin. Eşkere ye ku, bivê; tiştê tê dîyarkirin, ne eve ku; dawîya hilbijartinan dubendîkî bi rejîmê û daxwazên nûnerên wê yên bingehî, datînê berçav. Nexasim hersê partîyên hilbijartinê de cihê xwe girtin, mîna hewceyîyên rejîma faşîsta leşkerî a 12 ê Êlûnê û gora bicîh anîna daxwazên wê hatin sazîkirin, û bo domandina rejîmê, ev hersê partî bingeh hatin derivandin.

Kiryar û xebatên, hilbijartinan ji hêla rejîma leşkerî a faşîst destpêkiribûn, yên bona bikaribê xwe pê veşêre (maske bike), û ger ev, bona bingeh kirina berdewama rejîmê bi têdayîyên leşkerî û zagonî kemilandibe jî, dihat xwestin ku li hemberê hin pêşketinên neberçav bûn, girîng bû hin amadekarîyên din yên rabartir û rîknewar bên pêkanîn. Di pêvajoya dewra sazûmanê li "sivîlan"; dakû pêşîya ji rêderketinên ji sazûmanê bê girtin; berberîya (muxalefeta) civakî bênin bin qontrolê û bikaribin bernameca (proxrama) xwe bikarbênin, serê tedbîrên wan yên pêkhatin de, sazkirina sê partîyên nuh hebû, yek wê biba "partîya dewletê" herdûyên din ji wê bibuwan "partîyên muxalefetê".

MDP a ku rastûrast ji hêla Kenan Evren û cûnta wî sazibû, mîna dijbehîkî CHP (Partîya Komara Gel), a kû ji hêla Ataturk sazîbûbû, dihat xwestin, vê pêvajoya nûh de, mîna nûnerîya rejîmê a rast û bikaranîna wê, bê bingeh rabar kirin. Herdû partîyên din yên ku bi navê Anavatan Partisi (Partîya Niştimanî) û Halkçi Parti-HP (Partîya Gel) hatibûn damezrandin, yek wê li "rastê" a din wê li "çepê", berberîya xaponek bimeşandan, lew ev barûkar ji wan re hatibû danîn.

Lê belê, ev partîyên hana, bi sazîbûn û fonksîyonên xwe, ji partîyên dijbehên xwe yên di demokrasîya borciwazî de, ji partî û sazûmanên tirkiyê yên berî 1940an, taybetîyên cuda di xwe de hildigrin. Partîyan, hata derba leşkerîya faşîst a 12. Êlûn 1980an, parlamento û sazûmanê de, jîyana civakî de, sazîyên giranîkî wan heyî bûn. Lê roja me de, nûnerwanî û berpirsîyarkarîya va sazîyan û cihên wan civakê de, çuqas bê gotin, bisînor bûye. Dikarê bê gotin ku, navbera cunta ordî( artêş), û sazîyên sivîl, levabûna kar heye. Çêkirina û meşandina polîtîka gelemperî û a parastina hundur û derveyî bin nunerî û berpirsiyarîya cûnta û arteşê ye û nikare dest pê bêdayîn; jiley polîtîka aborî, civakî û çandî a ku ji hêla va hêzan hatîye danîn, divê jînê de bi destê va sazîyên sivîl bê bikaranîn, û tê meşandin. Ev modela piştî 12. Êlûnê bi sazûmana Bulent Ulusu bikarhat, çara yekemîne ku li Tirkîyê tê ajotin. Bilî vê, welatên dinê yên din de, ku bi dijbehê vê modelê rejîma wan tê ajotin, ev model bo bikaranîna xwe dorfirehîkî, dikarê peyda bike.

Cûnta Kenan Evren, mîna giş licnan, vê navçê de jî Kemalîzmê bê kêmasî bikartêne. Şêwa, bi hilbijartinên 6ê Mijdarê demokrasî vebûye tê gotin de, partî bi hin tedbîrên babetîyên zagonî û leşkerî, bi rewşên xwe ku bi parlamento û sazûmanê li hemberê artêşê hatine danîn, talîya bikaranîna Kemalîzmê vê merhelê de ye.

Di navbera salên 1920-40an Ataturk û ordî, bilî hemû zordestîya dewletê destê xwe digirtin û diqtatorîkî hişk bikartanîn, bona bikaribin vê dîqtatirîyê bin av bikin, demajotê de, bi dorûkesên nêzîkî xwe hinakan re rola îqtîdarê, hinakan re ya berberî, navxwe belav kirin û sê-enîşka; partî, sazûman û meclîsê, şerekê ji zûve hatibû pêkanîn û lihevhatî, pêşîya çavan daweşandin. Sazûman û sazîyên sivîl, pêşgav Îsmet Înönü, Celal Bayar, Fevzî Çakmak hwd. û kesên mîna wan bi navûdeng, vê navberê de tenê mîna Bûrok ku bîryaran bicîh dianîyan, dixebitîn û nekarin xwe ji bêşek bûna sencîra ferman-dîrektîfa xwe serbest bikin.

Balam, ev sazûman bingeha xwe a rast a sîstemê, bi qapîtalîzma yekdesta bihevexebatdar sazî kir. Lew, qapîtalîstbûneke wûsa, aborî de talan û kedmijandinên gewretir, rêzanî de bi emperyalîzmê re her babet bihevrexebatî, ser berberîya civakî pîkolîyên bêsînor û ser merhela civakî (sosyal) çuqas bê gotin, belengazî û bêkarî tanî. Bona bikaribê xwe serpê bigre, xwe ser zora leşkerî dadihilmand. Ev jî rejîmeke bêsînor navend (merkezi), zorhewce dikir. Rojên me de, rejîmên wûsa bêhtir bi cura dîqtatorîyên faşîstên leşkerî xwe derdixin têmaşê û berpêşê. Dîqtatorîyên wûsa ji ber sedemên taybetîyên xwe, naxwazin nûnerî û berpirsîyarbûnên xwe bi hin otorîte û sazîyên din re leva bikin. Vê tenê bona bîrdozên wan re girêdenek hişk hebe, û bona berjewendên ew nûnerî jê re dikinre, ser bingeha xizmetê, bizavî hebe, dikarin biderivênin. Bêguman, sazûmana bi sîstemeke wûsa hemû jîngarîyên civakî, rêzanî û aborî, diqulibîne leşkervaniyê (mîlîtarizmê), ango hemuyan dikşîne nav sencîra bîryar-direktîfan, kîn bê gotin, talîyên bi vî awayî, diafirîne. Rojên me de, li Şîlî hwd. û li hin welatan bikartê, ev modelên rejîman, ger cudayîyên nuansî dîyar bikin jî, bi bingehî bivê taybetîyê ne.

Belê, ev rewş bi hebûna partîyan, sazûmanê û parlamento seranser, dij-bendî dîyar dike, ger ev çuqas ji hêla cunta xwerû û normal bê şanîdan, bila be; ev rewş ji hêla partî û sazîyan ne mimkine bi temamî bê derivandin (qebûlkirin). Û ev, li navbera van hêlwestan û cunta, hem-

berhev, têkçûn û peritandin birêve dibe; bêguman wê nav wan de dubendî û lihevdan sadir bike.

Ev rastî, ji nuha de ketiye nav berpêşa rojgoranî a Tirkîye. MDP a ku bihisaba partîya dewletê hatibû damezrandin û hazirkirin, dema hilbijartinan hindakir, û bêyî bê xwestin ANAP serkeft û ji ber tekoşîna nav hêzên borciwazî û hêrsûgira gel hemberê vê rejîmê, mîna kedekî dawîya van rastîyan hat ser kar, rewşa rejîmê kire zehmetkêş û peyvajoya wêranbûna wê lezand.

Turgut Özal û partîya wî demekî wûsa de, sazûman girtin. Bilî ku nûnerîya rikna aborî a 12. Êlûnê dike û bi erkên wên yên hundurî û derveyî girêdayîye, ev tengasî û aloziya rejîmê, navbera Evren-cûnta wî û sazûmana nû, hemberhev, xofanî û dubendî sadir kirîye. Turgut Özal û partîya wî, mîna me li jorîn jî pêşîwar kir, bêîktidarîkî bi vê curê seranserî qîm nakin, ev derivandin bi şiphe tê xûyanîkirin, lew ser riya sazûmaneke "xwekesî" çêbûnê, wê cuntayê, ger ta sînorek jî be, di enîşkê de bidehfênin, herwiha sext (zor) li ser çakbênin. Lewra, ev partî dizane ku, iktidar bûn û karbidest anîbûn livek jî bi va erkan ve girêdayî ye.



Sazûmana Turgut Özal, ger ji ber taybetîyên pêvajoya jîngar û ger ji ber qerektera rejîmê a tenha, ya ku em kin ser axifîbûn, bi gelemberî bi navê sazûmaneke "wê bê derbasbûn" tê navdan, û hesibandin. Ev bi têdayîk rast e. Lê, ne mîna cunta û piştgirtên wê dîyarî dikin. Gora wan, gora derdorên berberîya borciwazî û hin dîtinên borçiwazîyên piçûk, sazûmana Özal bona derbasbûna demokrasî, an jî vê navberê de, xelekekê nûnerî dike. Demokrasîya ku ew ser dipeyivîn, demokrasîkî çawaye, Özal û partîya wî ji hêla kê tên ajotin, dema wûsa pir zelal berçavan be, divê ev derbasbûn têdayîkî din, dixwe de dahilbigre. Belê, sazûmana Özal sazûmaneke wê derbasbibe ye. Lê ev derbasbûn gora bawerîya me, domana bingehsazîkirina faşîzmê de, ji ber ku bi giringî hewce bû û bona leyîstokên demokrasîyê ji rexn û lomên hin doran biparêzin, bona nehêlên dubendîyên nav berberîya borciwazî û cunta behtir dijwartir bibin, derbasbûneke faşîzmê a nerm pêwîst bû; û ev derbasbûn bilî vê ne tiştek dîye. Gora vê bawerîya me, sazûman, dinavbera hêzan mîna keda lihevhatinekê, a kû gotin li ser nayê kirin, derketiye holê. Kenan Evren û cûnta wî, daku beramberê (muxalifên) xwe ji sazûmanê dûr bikin, li hundur û derve ji xwere hêz lihevbidin û bicivênin, û rejîmê rabar bikin, dixwazin ji sazûmanê bi vî awayî berjewendî bigrin û vê yekê plan dikin, ji hêla din di serî de berberîya borciwazî, lê hemû hêzên din ji, dixwazin ji alozî û nexweşîyên rejîmê parî bigrin û giranîya xwe zêde bikin, bona bîrdozên xwe hêz ji xwere bicivênin û xwe rêxistin bikin, lew dixwazin vê navbera tekoşînê de, xurtî bo ramanên xwe pêk bênin.

Gora vê têdayîyê, mirov dikare bêje ku sazûmana Özal, sazûmaneke darbasbûnê ye û ser de ji, sazûmaneke nav hêzan de rewşa mêzîneke ku rola "wekhev" dileyîze ye, (ango şerê serkeftinê nunerî dike ye.)

Eşkere ye ku domana vê derbasbûnê wê ne dirêj be û hilbijartinên cihî yên pêşîya me de, wê bûyer û rûdanên nû derkevin berpêşa rojê. Em dixwazin dîtina xwe a fireh ser vê yekê gavek din dîyar bikin; û nuha mijûlîya karên Özal yên binavûdeng, ango behsa polîtîka wî a aborî û bikaranînên wî yên din bikin.

Li gel rastîyên li jor hatin gotin, sazûmana Özal qebîneke aborî-rêzanî ye, lewra taybetîya komeke teknoqrat û buroqratbûnê, behtir giranî daxûyan dike. Rastî, bingeha aborî a ku jê re nûnerî dike, û bi polîtîka wê a ku dadihilme, ev sazûman, berpirsiyarê rejîma 12. Êlûnê a misagore û dikarê hişk bê gotin ku, rejîm bivê sazûmanê gihaye têdayîya xwe a rast û xwebingeh. Dema mirov bikaranîn Turgut Özal, ji dema ev alîkarê serek nûner bû, berbal bêne, wê bê dîtin ku ev gotina me wûsa ye. Wê demê de borciwazîya yekdesta bihevrexebatdar, bona rêzanîya xwe a aborî jîyanê de mîsagor bike, xebatên xwe yên pêşemîn birê xistîye, û bona vê yekê kanîyên hewce yên pêşemîn vekiribû. Piştî 12. Êlûnê, hin guhartinên giran di jîyana aborî de hatin danîn, lew ta vê mêjûyê, Tirkîye bi modela împortê dihat nasîn, aborîya wê ser qrêdî û împortê hatibû danîn, îsrafa bazarên hundurî yên aborî bisînorbû, lê pişt vê mêjûyê, îsrafa bazarên hundurî pir dijwar hat kêmkirin û bi modeleke nû guhartin ku xwe ser exportê dipaland. Bona, ji vê re bikaribin sermîyana hewce lihevbicivênin, rêzanîkî mijandin û talanê a dijwar birêxistin, çîna karkeran û gundîyan dehfandin belengazî û xizanîyê, hin çînên navber û birêk ji burjuwazî mezin û yekdest (monopol) kişandin îflasê, bêkartî, buhatî û enfîlasyon giha taxên bilindtirîn. Ji ber talîyên va bikaranînan, ji hev cudabûna çînan civakê de û dubendî xwe lezand, û ev rewş karlêkirina (tesîra) xwe bêhtir nav çîn û tebeqên borçiwazî xwe şanî da. Lê ev çûyîna bilez, ji herkesî pirtir, cunta bizdehand. Di vê niqtê de, Turgut Özal ji ser kar anîn xwar, dakû bikaribin, rexnên ku rêzanîya aborî damizandibû sivik bikin. Bi serekê malîyê, (daratîyê) yê ku nû şûna Özal anîbûn ser kar, rêzanîya aborîya 12. Êlûnê, bin daxûyanîyên ferqî, dadomandin. Lê, ji ber ku guhartinên bingehî pêk nanîbûn, ev ji rê derketina bisînor ji rêzanîya aborî, model anî berbitehlûkên û têkçûnên giran. Nemaze, serî de parêzkarê modelê IMF (Fonda Daratîya Navnetewan), li hemberê vê rewşê derket û tirsa xwe dîyar kir.

Niha bi talîyên ji hilbijartinan derketî, wê bi sazûmana Turgut Özal, vê rêzanîyê ji nûhve de û hem jî bi hemû unsûrên xwe ve, deynin bername rojê de, û sazû-

mana Özal jê re haceta nasîkirinê bikar bê. Ev gava rêzanîyê, bi navê pîyasa serbest a aborîyê tê navdan û wê pêvajoya pêşîya me de ev polîtîka gavên xwe bavêje pratîkê. Di rojên derbasbûn de, Turgut Özal vêna bi şiklê "6 pakêtên xofê" dîyar kir, û tedbîr, erk û talîyên aborî yên ku di rojên me de birêbikevin, bi vî awayî pir zelal danî pêşîya çavan. Bi tedbîrên zagonî, ku demeke pir kurt de pêkanî, destpêkir ku hemû zorîyên li pêşîya rêzanîya aborî, yeko yeko ji holê rake. Zagona "parastina perê Tirk", burokrasî û şirûtên wê, ji hêla sazûmana Özal gora rêzanîya xwe, tê guhurandin. Di merhelên tasarruf û exportê de, bona bikaribe gavek bo qapîtalîzma yekdesta bihevrexebatdar pêşve bibe, dîyar kir ku, wê hemû rêyên ku rêdidin wê biceribîne. Ji ber vê yekê, sazûmana nûh, ji alîkî bi bikaranînên talankarî û malrûtkirin, bi pîkolîyên babetî ser kedkar û xebatkaran, mêtin û mijandinê dighjîne taxên banî; ji alîyê din, piştî talankarîya bankêran, dixwaze tiştê di destê çînên navber maye, ji destê wan bistêne, bona vê yekê azînên xwe yên kevin, bin cilikên nû daku bikaribe bajo, hazirîyan pêk têne. Rû û kiryarên razandina sermîyanê, pirtir diqulibînin derveyî welat û ji xwe re exportê bingeh digrin; destpêkirine ku pîyasa hundurî, bikaranînên bazarên serbest û bi hêsanîyên împortê bo monopolên navnetewan pêşkêş bikin.

Ev pêşketin hemû şanî didin ku, ger borciwazîya Tirk car-caran guhartin şanî bide jî, bi bingehî, aborîya teklihevî serpêhtîyê a ku ta 12. Êlûn 1980an berdewam kiribû û bikaranînên dewletwanî, bi bîryarên aborîyên 24. Çilê yên borciwazîya yekdesta bihevrexebatdar seranserî pejirandin. Polîtîka dewletwanî, bêhtir mafên û berjewendên çînên navber re berdestî dike, ji bona jîyana van çînan bingehên maddi sadir dike, nahêle ku sermîyan lihevkombicive û bilî xwe, ji bo çînên û tebeqên borciwazî yên din re jî, îmkana metandin û jîyanê nasdike, ji bona vê yekê ev polîtîka berjewendên borciwazîya yekdesta bihevrexebatdar dike xwusarê, ango dubendî diafirîne. Ji ber vê sedemê, baraj, rê hwd., hin avayîyên riknî û bisinor, hin qadên razandinên sermîyanên mezin bilî KIT (teşkîlatên kargehên dewletê) hwd., hemû cîhkarên dewletê bilez diqulibênin sazîyên sivîl, an jî wanan didehfênin îflasê û sermîyana wanan diherikênin banqan. Tewrê buroqrasî a sazûmana Özal ji vê rêzanîyê derdikeve. Çêtir bê gotin, keda rêzanîya ku ew li hemberê çînên navber, birêve dibe ye.

Di rêzanîya aborîya sazûmana nû de, bikaranînên li Kurdistan wê ciheke girîng bigrin. Dikarê bê gotin ku, bona jîngar kirina wê rêzanîyê wê xebatên xwe bêhtir pal bidin Kurdistanê, lew ger bi kanîyên dewlemendîyê yên sererdîn û binerdîn, bi şênîya hêjmara hêzdar û ger jî, ji ber erdnîgarîya nêzîkî Rojhilata-Navîn ku li vir exporta Tirk zexme, ev rastî derdikeve holê. Bikaranînên aborî li Kurdistanê, mîna berî, wê rojên pêşîya me de jî, wê bi du têdayîyan kûr bibin.

1- Talankirin û malrûtkirina gelê me, ji hêla din, talankirina dewlemendîyên me yên xwerûstî.

Piştî 12. Êlûnê, bikaranînê talankirin, mejandinan yên ser gelê me, bûne karên rojeroj û bikaranînên vê sazûmana nû ev, wê wûsa dijwar bibe ku wêca nikaribê bê debarkirin.

Bêkarî, xizanî û belengazî wê her mal û kes bikşîne bin karlêkirina xwe, dikarê bê gotin ku, domandina jîyanê wê pir zehmet bibe. Hêza keda erzan a gelê me a çeleng û jîr wê bêhtir bifroşin metropolan û welatên derveyî.

2- Bi destpêkirina keda di zêwîyên me de, dest danîna ser kanîyên me, her çuqas bikaranînên bingehî yên dema niha ne jî, rêzanîyên aborî yên giringtirîn li Kurdistanê, wê bibin "proja Ferat a jêr" û "baraja Ataturk". Ev projên bi navê "serkeftina duwemîn a Sakarya" tên navdan, ger bicîh bên, wê rolekê stratejîk ji bo jîngarkirina aborîya Tirk û hedefên nûh hatin danîn re, bileyze. Dinav malên exportê cîhên girîng digrên; dexil, heywan û kedên heywanî yên ku maddên xwarinê yên bingehînin, carek din seranserî wê ji Kurdistan û ji destê gelê Kurd, bi buhatîya pir erzan, bistênin û ji xwere bidest bênin.

Rêzanîya aborî a Turgut Özal, ji hêla din wûsa hatîye avakirin ku, bikaribê pêkanîn û hedefên leşkerî yên cunta bimeşîne, jê re xizmetê bike. Gora vê, sazûman mecbûre ku bi razandina sermîyan û bikaranînên xwe yên exportê, luzumata ordîyê ji tim berbal bine û wêna bicîh bêne. Dikarê bê gotin ku di serê bernameca avakirina hundurî a vê sazûmanê de, sazî û kargehên ordîyê hene. Polîtîka sazûmana Özal a derveyî de jî, wê bikaranînên aborî cîhên girîng bigrin. Hemû temaşakarên welatên derveyî yên rêzanî di vê gumanê û dîtinê de, yekbawerin. Ev rewş, bi taybetî bo welatên kapîtalîst yên pêşketî û bi gelemperî jî, ne geloware (acêbe). Lê belê, ji ber ku unsûreke pêwîst ya sîstema karbidest re nûnerî dike; rêzanîyên serpehtî ku borciwazîya Tirk ta rojên me dimeşand, bi vê sazûmanî re guhartinên pir girîng sitand. Rêzanîya derveyî a Kemalîzmê, a ku dixwest bona Awrupa Rojava bibe endameke ji dil û lê belê, bona bikaribe xwe palêz bike, ji dubendîyên nav sîsteman û polîtîka "serbiserîyê" (dengê) feyde girtin jî, paşçav nekirîye; balam bivê sazûmana nû, ev rêzanîya Kemalîzmê, hatîye ber enîşkên pêşketin û bûyerên pêwîst.

Rêzanîya derveyî a rejîma 12. Êlûnê, gora daxwazên xwe yên vegirtin, êrîş û ax-zeftkirin; û gora qerektera xwe a bihevrexebatdar tê avakirin û sazîkirin. Rêzanîya aborîya nûh û taxên pêşketinên wê yên kapîtalîzma yekdesta bihevrexebatdar, xwe ser exporta sermîyan, mal û hêza mirovatî paldide; ev ji bingeha polîtîka derveyî a rejîmê daxûyan dike. Bivê re jî ev bingeh, bona borciwazîya Tirk a yekdesta-bihevrexebatdar, di vê dema nûjen de zixta riknetire, daku daxwazên xwe yên qolonîalîst û emperîalîst bikaribe bicîh bêne. Belê, di rêzanîya dervayî a rejîma 12. Êlûnê, taybetî li Rojhelata Navîn û Afrîka Bakûr, têdayîya daxwazên firehkirina ramanên aborî, rêzanî û çiqa biçe leşkerî, daxûyan dikin, ango daxwazên serveavêtin û zeftkirin dadihildigrin. Û cunta faşîsta Tirk bi pêşkaranînên leşkerî yên ku berçav dajo, bi ceribandinên xwe mîna tevgera êrîşa ser Kurdistana Başûr, nema hewce dibîne ku xwestinên xwe di vê merhelê de veşêre, û ev rastî ew bixwe datîne pêşîya temaşê.

Bilî vê, ev guhustina nûhen di rêzanîya derveyî a rejîmê, bizaveke pêwîst, ji bona ku USA bikaribe polîtîka xwe a heremê di jînê de pêk bêne, dileyize. Dikarê bê gotin ku, ev tevgerî bona rêzanîya derveyî û nûh ya Tirk, ta liçkekê ji hêla USA bi rewşa xwestina wê, tê plandan.



Serekê SODEP û DYP bihevre.

Emperializma USA gelek baş dizane, ku bi destê Îsrail hwd. bi destê welatên di heremê de birabirin (tecrit) bûne, polîtika xwe a Rojhelata-Navîn, nikare jîyanê de bimeşêne. Bi taybetî piştî ketina şahê Îran, USA, bona xebata karbidestîya xwe li heremê de, pişta xwe bi bingehî daye Tirkiye. Bona vê yekê, pir bikaranînên giring pêktêne, daku sazûmana Tirk a bihevrexebatdar xwe li xopanê de, bighijine helûdorên fireh; USA, Tirkiye di vê rexê de tamakar dike. Lew, ew pir baş dizane ku, rejîma jîngar, ya ku di heremê de hin cihan de xwe vekirîye û firehkiriye; ev cîhên heremê, cîhên ku bi gelemperî tesîra û rêzanîya USA û emperyalîzmê nasîn wê bikinin, wê jê re roleke pir gewre bide leyistandin. Sazûmana faşîsta Tirk, gora keda rêzanîkî wûsa a sîstematîk, di rojên me de, li welatên heremê yên li dijî USA ne, mîna Îran, Sûrî hwd. de, di bin navê têkilîyên bezirganî, berjewendên aborî yên beşên ku temsîl dike, bicih têne. Perê ji dixebite, daku bikaribe polîtika emperialîst li vadan bike berpêşa rojê û jê re bingehan biafirîne.

Ev rêzanîya derveyîya nûh a rejîmê, a ku ji hêla sazûmana Özal bikartê, bi têkilîyên xwe bi emperîalîstên Awrûpî re wê wûsa nikaribe bimeşe, lew ev liçek bi guman xwe daxûyan dike. Lewra rêzanîya derveyîya Tirk, bi gelemperî gora berjewendên emperialîstên USA û hêzên bihevrexebatdarên wê, hatîye sazikirin. Ji ber vê dîtinê, di heremê de dijî USA tekoşîna karbidestîyê dajo EG (teşkîlata bihevrexebatdarîya aborî a welatên Awrûpa) û bi taybetî mihwera Frensa re, ji ber hin sedemên aborî û rêzanî, bêguman car-carnan wê dubendî û kişkişandinek girîng navbera wan de derkeve ronahîyê. Rojên me de, tewra Awrûpa a bi tirs û bêdilî li hemberê rejîma Tirkiye, talîya û keda vê dubendîya berjewendên wan e.

Rêzanîya derveyîya serpehtî a dij-komunîstî û dijminê welatên sosyalîst, bin vê rejîmê bi domanî xwe behtir dijwarkir, lê bilî vê, bona bikaribin armancên xwe yên aborî û rêzanî bicih bênin, û gora teqtîqa dorfirehkirina xwe, pêwîst bi va welatan re ji di çarçiwa têkilîyên bezirganî, wê alaqadarîyên xwe ta sinorekê zêde bikin, bêguman emê leqayî wê rastîyê ji bibin. Ramanên rêzanî ya vê polîtika bi welatên sosyalîst re eve ku; daku rejîma faşîsta Tirk bikaribê xwe ji birabirînê biparêzê, û alîkarîya van welatan bona dij-hêlwesta şoreşgera demokratîk a Tirkîye û Kurdistanê, bidê rawestandin.

Bi kurtî, em dikarin armancên bingehîn a sazûmana Özal wûsa pêşçav bikin. Eşkere ye ku ev rêzanî bi taybetî ji hêla polîtika hundurî wê nexweşîyên û aloziyên giran û pêwîst bidamezrîne. Ev, ji ber pir sedeman, bêguman wê birêbikeve. Berî her tiştî sazûmana Özal, bi alîkarî û piştgirtina cunta û ordiyê, rêzanîkî aborî bi bikaranînên hovberê danîye holê. Ev, wê hejandinên û aloziyên pêwîst yên aborî û civakî sadir bike û çuqas dem bibhure, ev wê biqulibe peqînên civakî. Bilî vê, ev polîtika zanîya rast û bingeha berjewendên borciwazîya yekdesta bihevrexebatdare, lewma wê tekoşîna li navbera çînên borciwazî ji, bi dijwarî, germ û tûj bike.

Tiştê xûyanî dike ewê ku, rejîma faşîsta mêtinger, xwe amade kirîye, daku bikaribe rîzîkoyên (talûkên) rêzanîya wê biafirîne, rawestîne û singê xwe li ber veke. Lewma, ne tirsa sextên dijberîya burjuwazî û birên piştgirtên wê yên Awrûpî, ne ji zorîyên dijberîya gel a welatperwer û şoreşgeran, vê sazûmanê ji gavên davêjê navegerîne û daxwazekê wê a wûsa ji tune ye.

Bi bingehî, ji ber rastîyên ku kapitalîzma Tirk dijê, ev ne rêdare. Serekê cuntayê Kenan Evren pir axafên xwe de, ku ji ber pir sedeman kirî de, vê rastîyê pir caran anî zman û hêzên dijberîya borciwazî va navçên jêr de bizdehîna şîyarîyê kir; şaşî û derketinên ji rêya jîngar, xebatên bêhîmkirina rejîma serkar, nemimkîne tu feyde bidê borciwazîya Tirk, pêre ji talîde ev, wê dijberîya gel zexm û xurt bike û rejîmê ji bin bêne berbitehlûkan. Avaya divê barê de, ji ber ku qoza xwe a dawî ji birêxistîye, tu rê bo xelaskirina dewleta borciwazîya Tirk, nemaye. Ev têgihiştina mejîyê, ger iktidara borciwazîya Tirk xwe bi rastîyên berçavî û bi têdayîyên sadiq dabihilmîne ji, dîyare ku tu çîn menfeatên xwe, bidilê xwe ji çîn û tebeqên din re fîda nake, ev mîna rojê zelale. Ji ber vê yekê, ev rêzanîya ku mafên borciwazî yên gelemperî berbal nake, û behtir mafên bireke kêmasî, dixwaze ser gişî pêkbêne û serdest bike, ger çuqas rastîyê daxûyan bike, bila bike, wê bo lihevdanan rê veke û leqayî berrabûnê bibe.

Di Tirkîya nihan de, bîryarên talî ku rejîm derxistîye, tê dîtin ku dijberîya borciwazî çuqas diçe dijwartir dibe.

Ger, birek ji dijberîya borçiwazî ji ber zora rêzanî û leşkerî bêkeys ketibe û bi cunta re hevrexebatdarî derivandibe ji, bi giranî, mîna li Arjantînê tê dîtin, wê dijberîyek dijwartir bibe.

Bi bingehî, borciwazîya lîberal û dijberîya borciwazîya piçûk kardike, daku xwe li dora SODEP (Partîya Demokrasîya Civakî) û DYP (Partîya Rêya Rast) ji nûhve de, rêxistin bike û tê dîyarkirin ku koma Ecevît-Tunç ji, mîna hêzeke nûh, wê xwe têkilî vê xebatê bikin. Bona wezîfa eşkere, dakû şoreş bê rawestandin û berbiçeper kirin û bona bi komên monopolên bihevrexebatdar yên USA, bi bingehî lihevhatin pêk bê, ji hêla derdorên emperialîstên Awrûpî ev tevgera dijberîyê tê sazîkirin. Mîna me li jor ji gotî, taybetîyê vê tevgerê a pêwîst eve ku, bi wezîfa bingehî şoreşê bidê rawestan-

dinê. Ji ber vê wezîfa bingehîn, ev tevger, dijberîya çep a borciwazîya piçûk dikşine pay dûvê rêzanîya xwe, û vê yekê mimkin dike. Îro buhatikî taybetî didin vê yekê. Borciwazîya piçûk a kû nav refên tevgera şoreşgera-demokratîk, bo tekoşîna îktidara demokrasîya gel, hêzeke girînge, ji hêla hin derdorên emperîalîst û dijberîya borçiwazî, ser bingeha rawestandina dijberîya şoreşger, tê rêxistin kirin û bikaranîn, ango vê hêzê ji xwere dihesilênin. Hin "çepên" reformîstên borciwazîya piçûk yên Kurdistan û Tirkîyê ku li Awrûpa koçberbûne û xwe bingeh kirine, tê dîtin ku xwe bona dûvikbûneke wûsa, hazir dikin. Ser rikna programeke bahevhatin li hêlekê bihêlin; ev reformîstên borciwazîya piçûk, bona xwe, ba dijberîya borciwazî, ku ew bixwe xwe meşrû nabîne û ba piştgirtên wê yên navnetewan, bidin derivandin, tevgerek birêve dibin, daku mîna hova ji her alî êrîşî tevgera şoreşger bikin, û ji nuha de ev xebat bikartênin. Herçuqasî, pir zelale ku, ev xebatên wan, divê rastîya jingar de, tu berjewendî bo "çepê" dûvik nahesilîne, lê wê bo dijberîya borciwazî hêzeke pir zexm lîhevbicivîne, ev pir eşkere ye; xwe bi vê rastîyê girê nadin. Dijberîya borciwazî wê vê hêzê ji bo xwe, di tekoşîna dijî cunta de, bikarbêne. Dijberîya borciwazî, ku derdorên emperîalîstên Awrûpî pişt xwe de kişandîye, berî rejîm bi hemû alîyên xwe rabar bike, dixwazê bi rejîmê re lihevhatinek çêke, dakû bikaribe, ger bisînor jî be, bona dozên xwe rejîmê bidê xebitandin. Lê belê, mîna li jor jî me nivîst, serekê cunta Kenan Evren di axafa xwe a dawî, ya sersela nûh de, carek din dîyar kir ku, tucaran wê derevendîya vê yekê nakin.



Nemaze piştra sazûmana Özal bi bîryareke xaponek ku ji ber hilbijartinên cihî, ji meclîsê derbaskir de, şêwir bû ku mêjîya hilbijartinan a ku hatibû danîn, sê meh pêşve anîn û hilbijartin wê 25. Adarê çêbe; ev şanî dide ku her rêya mimkin be, daku bikaribin dijberîyê bihelênin, wê pêk bênin an jî dixebitin daku dijberîyê bêtesîr bikin.

Cunta dizanê ku, partiya ANAP, daku bikaribe 5 salên xwe ser sazûmanê gerantêr bike, pir girîngî dide hilbijartinên cihî. Ji ber vê yekê, cunta çeka dijberîya borciwazî vê neqlê li wan diqulibêne û berî ANAP bêkeysbikeve û berî SODEP û DYP yên ku nûnerîya dijberîya borciwazî dikin, xwe komcivîn û bihêz bikin, dixwazê hilbijartinên navberê dawîbike, dakû bikaribe talîyên hilbijartinan rikne bike û bi vî awayî liberhevdanên ser hilbijartinên dembizû bidê rawestandin û xebata sekinandinê bi vê ramanê dilezîne. Teqtîqa hilbijartinên cihî pêşve, anîn ji ber ku fîrsenda xwe lihevdana partiyên din nahêle, dibe ku cûnta rêya serkarmayîna ANAP, di domana wê a normal de, bide. Lê ev hilbijartinên hana, şanî didin ku dijberîya burjuwazî jî, bir rewşa hêzeke pêwîst a rêzanîyê, wê jîyana xwe ser rejîmê, çuqas biçe bêhtir, paldan bide. Kurt bê gotin, ev teqtîq wê dijberîya cûnta a jêr û bidest bihelêne û ev rast e. Lê dijberîya burjuwazî rabare bi va azînan bê helandin. Herweha cûnta bi talîyên hilbijartinên cihî, dibe ku rêyên hilbijartinên dembizû bide rawestandin û bi vî avaya ketin û qelsbûna xwe a dileze, bona demeke kin, siviktir û neleztir bike. Belê, ji ber ku dijberîya borciwazî tim leqayî çeperên zehmetîyê dibe, wê berdewam bike ku rejîmê ji derveyê platforma zagonî berbizorê bêne, ev rewş wê qontrola cûnta ser, dijberîya li derveyî zagonî pêşdikeve, kêm û bêhîm bike. Ev tekoşîna ta hilbijartinek din, demek pir dirêj, wê dombike, bixwe re hilweşandina û bêkeysbûna cuntayê wê bêne, lew ev bûyereke zorxwaze.

Tekoşîna navbera çînên borciwazî, ger rejîmê berbihilweşandinê bêne, û dijberîya şoreşgera-demokratîk nealternatîfê îtkîdarê be, wê talîyek mîna li Arjentîn derkeve holê, ango mesele bi vê mînakê wê bêhelkirin, divê em bikaribin vê yekê ji bênin pêşîya çavên xwe.

Li hemberê van hemû pêşketinan, eşkereye ku pêşîya hêzên şoreşgerên-demokratîk yên Kurdistan û Tirkîyê pir erkên pêwîst yên dîrokî hene.

Helbet wezîfe ne eve ku, mîna "çepê" borciwazîya piçûk, ku dixwaze bi hêzên demokratîk jî bide derivandin, dûvik bûyînê. Ev "çep" îro dibe dûvika dijberîya burjuwazî, a ku piştgirtina hin çengên burjuwazîya yekdeste û alîkarîya emperîalîstên Awrûpî jî digre. Ev dîtina me nayê vê têdayîyê, ku tevgera şoreşger û demokratîk, biqasî rêbar be, ji dubendîyên navbera hêzên borciwazî, berjewendî negre. Li çewta daxûyane ku ev dubendî û şerê di rojên me de tê jingar, pir derizandinên pêwîst, di sîstema karbidestî û pîkolîyên hovûtarî a faşîzmê de, vedike. Di vê hêzên şoreşger û demokratîk vê derzê hejî kûr bikin, û bêgotin ji wê, bona tekoşîna xwe berjewendan biserkevînin.

Bi şêwa bernama xwe a serbixwe û rêxistina xwe bixwe heyî; hêzên şoreşger û demokratîk dikarin bivê dijberîyê rê ser hin kîryarên şirîkî li hember cûnta, hin lihevhatin û bihevre tewrînkirin bikin; lew redkirina vê neraste. Lê belê, di bin van şêwan de jî, lihevhatin û têkilîyên çêbin, divê bi şerta dijwarahişk, bona pêşvebirina şoreşê, bê girêdan, lew ev şert zorakîye. Hêzên şoreşger û demokratîk, dema ser rêya hedefên proxrama xwe dimeşin, ger leqayî hin dijberîyên borciwazî ku bi wanre li hemberê rejîma jingar, dixwazin bimeşin û ev bisînor jî be, bibin, bi şerta ku ew tekoşîna îktîdara demokrasîya gel nerawestênin, kîjan ku li hemberê borciwazî meşa ser rêya sosyalîzmê armanç dike; dikarin bi wanre, bihevre, bixebitin û hetta dikarin bihevre bimeşin îktîdarê. Belê,

*(Dûmahik di rûpelê 18an de ye)*

# Lİ WAN'Ê Çİ DİBE?

Roj biroj taybet û rola cuntaya faşîst û karbûna wê aşkeretir dibe.

Çûn û hatinên Tirkiyê, gerên Kurdistan ê, têkiliyên paşverûkên Rojhelata-Navîn, çûn û hatina heyeta, general û pirsporan hwd. mîna bûbin karên rojê.

Ev yekên bi tu pergalan li ser gel baldarî pêknaynin û ev pêkanîn bi rastî jî afirandinên demeka pêwîst, karbûna vê demê û haziriyên êrîşa daxûyanî derdike. Û ev yekan çend taybetên berçav dikevin. Ji ber vê rewşê dibî ku ev çûn û hatin, "serîlêdanên welatê cîran" nêne dîtin, lewra ev têkiliyên çarenînin.

Ku cunta faşîsta qolonyalîst bi êrîşa 25 Gulanê, tevgera Kurdistan a Başûr, bê veşarî hemû taybetên xwe yê nemirovî daxûyanê holê kir û ev taybetê êrîşbazîyê aşkeretir bû. Ji bo binxistin û hilweşandina Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê ku cunta qolonyalîst hemû destikên xwe bikartîne û dest davêje hemû rêyan. Lewra ev tekoşîn ji dijminê qolonyalîst re hêzeka xedare û roj-biroj derbên pêwîst li dijminê qolonyalîst dide. Ji bo binxistina tekoşîna serxwebûna Kurdistan'ê ku mîna hova xwe karê êrîşbazîyê dike. Bi hemû tevgerên xwe yênemirovî, kuştin, êrîşbazî û serxwarîyê hwd. amancê dijminê qolonyalîst ne guhurîye û ji bo gihîştina vê amanca rûreşî xwe dikemilîne. Nexasim ev amanc ji hêza qolonyalîst re roj-biroj pêwisttir û xedartir dibe. Ger bi vê rewşê bêyî mêzekirinê, bi hemû taybetan ev yek aşkere xûyan dibe ku;

Burjuvazîyê Tirk ji bêmecalî û destika xwe ya dawîyê karbidestîya 12 Êlûnê anî serkar lê, di alî amancên xwe de kêrnehatin û amancên xwe pêkneanîye.

Ku binxistina tevgera PKK, Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê amanca yekemîn dîtîye, di rewşa dijwar êrîş, qetlîam û şerê aşkere de ev tekoşîn pêştir ketîye û bi pergalên hêza hemberîyê, li dijî cunta qolonyalîst rawestîye. Nexasim xebat û karên ji hêlên tixûb ber bi welat ve tê herikandinê û ev xebat cîh digre dijminê qolonyalîst hovtir û hartir dibe.

Burjuvazîyê Tirk di alî xebat û kêrhatina aborîyê de binketîye û hemû pêkanîn û destikên wî betal mane. Di bin rewşa zerpê de, hemû keda girseyên gel tê pêjrandin, kedxwarin gihîştîye qeysa bilindî, mafên demokratî û aborî ji destê girsên gel hatîye sitendinê hwd. Gel li ber rewşa birçîbûnê ye. Welew di alî aborî de xwe bi derî welat karbike jî, ji taybetên xwe gerineka aborîyê kûrtir dibe, û roj bi roj dikeve vê gerinekê.

Ev herdû nuqtên pêwîst jî ji bo bişkavtina burjuvazîyê Tirk têr dikin. Ev sazûmana pirsgirêka tevgera gelê Tirkîyê, Tekoşîna Rizgarîye Netewa Kurdistan'ê û pirsgirêka aborî ji holê ranekirîye, hêzên hemberî xwe firehtir kirîye. Bi pêkanînên sê salên xwe jî hêla netewî li welat cîh lê teng bûye. Û gellek hêlan hemberê xwe rawestandîye.

Ji taybetên xwe ye ku ray li hemberîya burjuvatî jî nayne û hewqas jar e. Di demên dawîyê de ku leystika wî ya "demokrasî" û "hilbijartina" bi taybetên xwe derî holê bûye. Burjuvazîyê Tirk bê veşarî derî holê bûye ku bêçek û xwînrijandinê najî û nikare bijî. Ku ji berdevkên berpirsîyarên sermaya yekdest, kesên "AP" û "CHP" li ber van yekan dengê xwe derdixin û ji alî cuntayê ve têne girtinê, ev yek bixwe jî nîşane ku burjuvazîyê Tirk çiqas jar e. Ger ji van kesên hebûna xwe dane oxira hebûn û domandina dewleta Tirk tirsa wî hewqas be, wê gavê bigotinan tirsa wî ya gel nayê hesabkirinê. Bingehên vê tirsê aşkere ye ku tevger û Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê ye. Burjuvazîyê tirk di vê rewşa pûçî û tengasîya aborîya xwe de, hejeka pûçik jî nikare hilde û di vê rewşa jar da ye. Lewra domandn û birsîvanîna pirsgirêkên wê li ser vê yekê ye. Ji bo vê yekê ye ku hemû polîtîkên xwe li ser vêderê avadike. Ji ber vê pêwîstîyê ye ku berî ev tevger derba binxistinê lêbide û bigihîje vê hêzê bêagadarîya hemû yekan destik û karbûnên xwe di vî alî de bikar tîne.

Lê, mîna me di serî de daxûyan kirîye, ji nûh ve hew dikare vê hêlê ji xwe re bike hêla jîyanê. Lewra di vî alî de tevgera PKK pêşvedîçe û firehtir dibe û ev tevger bihêza xwe ya gelî, hemû karbûn û destikên dijmin betal dike. Ji alî din ve pêşveçûn rewşa Rojhelata-Navîn jî gihîştine qeyseka ku hedan lê nabe. Ji ber tesîra emperyalîzmê kêm dibe, jarbûna karbidestên paşverû, keysafirandina şerê Îran û Îraqê ji bo pêşvebirina Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê taybetên erinî ji bo karbidestîya Tirk afirandinên xedarin.

Ku Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê ji bo Rojhelata-Navîn navça pêşvexistina ye, ji hatina Rojhelata-Navîn ji hêlên bingehî yek jî Kurdistan e. Ji van taybetan, pirsgirêka Kurdistan'ê ne tenê ji burjuvazîyê Tirk ra ji hêzên emperyalîzmê re jî pirsgirêkeka bingehî ye. Mafên wan di vî alî de dibe yek. Ji bo binxistina vê hêzê hevkarên hev û dun e. Welew ev hêz binnekeve, bivê pirsgirêkê ve derkirina emperyalîzmê çarenîn e. Bi kurte-birî îro emperyalîzm jî polîtîka xwe li ser bingehê Kurdistan'ê saz dike. Ji xwe aşkere xûyaye ku di Rojhelata-Navbîn de hevkarî û yekoxirîya emperyalîzm û dewleta Tirk berbiçav ketîye. Karbûnên wa yê li ser Kurdistan'ê ji vê aşkere didin xûyakirinê.

Ji ber burjuvazîyê Tirk domandin û hebûna emperyalîzmê bi hebûn û jîyandina xwe ya bê sînor karbûn û êrîşbazîyê pêktîne. Di bingehî de, tevgera Kurdistan'ê û pêşveçûnên Rojhelata-Navîn binbixe, mîna hêzeka "fedaî" ji bo mafên NATO derdikeve pêş, helbet di vî alî de, ji bo êrîşbazî û mafên xwe rê ji xwe ra vedike. Ku ew amancê xwe yê li ser Mûsil û Kerkûk'ê di vê rewşa jarbûna sazûmana Îraq'ê de tîne holê helbet ne bêtaybet e. Di vê valahîyê de keysa pêkanîna amanca dîrokî dide berxwe. Ji ber rewşa şerê Îran û Îraq'ê û hemberîya hêzên pêşverûyên Kurdistan a Başûr ku sazûmana Îraq'ê li ber ketinê ye Di vê rewşê de cunta faşîst gumana tu tiştî nake. Û ji karbidestê Îraq'ê, ger li Kurdistan'ê karbidestîyê pêkneyne, hemberê kêrhatin û karbûna vê hêlê demê, û hêlên xeta petrolê Mûsil û

Kerkûk'ê nikaribe biparêze, wê gavê bêşert û bend ray li tevgerê wî bîne û di alî tevgeran de destikan jêre bikarbîne. Nexasim ev sê mehên bi giranî li ser van pirsgirêka tê seknandinê. Di şerê Îraq û Îran'ê de, dewleta Tirkîyê ku sefê sisêyaye û bi vî pergalî mîna xwedîyê Kerkûk'ê derî pêş dibe û gefan li Îran'ê dike hwd. Bişkavtina van li ser van bingeha ye. Di van hevdîtinan de amanca cuntayê ev e ku di vî alî de bi sazûmana Îraq'ê amanca xwe bide hebandinê.

Ev tevgerên di alî amancê de şirîkatîya emperyalîzmê jî têde heye, nedûre ku tevgerên êrîşbazîyê derî holê bike. Ji xwe ji serî ve cunta faşist xwe karê wê dike. Avakirina cîhgera balafirgehên Amerîka, sazkirina "hêza çeleq" pêkanîna hêlên stratejîk û cihbûna ceşê Tirkîyê nîşana vê yekê ne.

Ku ceşê Tirkîyê ji alî emperyalîzmê ve tê kemilandinê, û hêza êrîşbazîyê ye. Ji ber rewşa û pêşveçûnên Rojhelata-Navîn hêza emperyalîzmê dema tengasîyê li hêlê dijî. Ger amanc û pêkanînên li ser Îran û Lîbnan-Filîstîn ger jî amancê li ser Sûrî'yê negihîştîye serî. Nexasim pêkanînên wan, hêzên pêşverû –mîna li hêla Lîbnan'ê– pêşvetir dixe. Pêxwas û berdevokên wana pejirîne û hew dikarin li pêş pêşveçûnan rawestin. Mîna peznê rojnamên Tirkîyê, ne ceşên Ereb'an ne jî Îsrail mafê emperyalîzmê nikarin bisitrînin û kêri parastina wê nayên. Di vê rewşê de hêza yekemîn ceşê Tirk e. Di vê rewşê de mîna ew têkilîya dîrokê di navbera emperyalîzm û çînên serdestê Tirkîyê ji nûh ve lê di rewşeka neerînî de pêk were.

Dema ber binketina împaratorîya Osmanîya de, nexasim têkilîya Almanya bi feyde ye ku bê bîranînê. Di wê demê de ji ber burjuvazîyê Almanya hêzeka emperyalîst-kapîtalîstekê ber bi nêzbûnî ve pergal digirt, ji bo Asya-Pêş û Rojhelata-Navîn serdestîya xwe avabike, sultanên Osmanîya li ser bingehê sitrandina paşverûkî, ji bo hebûna împaratorîya Osmanîya bidome, bi hemû pergalan alîkarîyê domandibû. Wê ji bo gihîştina amanca xwe çarenin dîtîye. Di vî alî de têkilî tenê ne bi têkilîyên aborî maye, gihaye wê qeysê ku ji karbidestîya nav dewletê, ceş mîna li gor amancê emperyalîstê burjuvayê Almanya pergal girtibe. Ji serdarîyê ta sazûmanên karbidestîyê di serî de Alman û ketibû destê emperyalîstan. Hêzên emperyalîst tu car ji ber amancên xwe yê bingehîn pêşveçûn û pêkhatinên Kurdistan'ê hêsan nedîne, lê rayneanîne û bi dijwarî xwînê rijandine.

Di alî binxistina serhildanên sedsalîya 19an rola emperyalîstê Îngilîz û Almana li Kurdistan'ê ku rastîyên ku dîrokê derî berçavê me kirîye.

Bi dewlemendîya sererd û binerdî û cîhê xwe yê stratejîk û dewlemendîya dest pê nebûye ji bo sîstema emperyalîzmê ku hêleka pêwiste nexasim di vê demê de ji hemû pêşveçûnan dûrhiştine, û di bin nîrê qolonyalîstîya împaratorîya Osmanîyan de rawestandine û di bin vê rewşa dijwar de ji qetlîaman ta nefîye gellek pêkanînên nemirovî li Kurdistan'ê bi cîh anîne. Nexasim hêzên emperyalîst ji bo li gor hemû pêşveçûnan di bîhndemî de polîtîkên xwe bikarbînin, û bi çi awayî be jî ji bo ku Kurdistan'ê di destê xwe de bisitrînin, berpirsîyarên xwe jî şandine bajarên Kurdistan'ê. Welew sekna wana binavê têkilî û sitrandina têkilîyên aborî be jî, eşkere ye ev kes ji vî karî pêştir li dû tiştan bûne. Têyî zanîn ku ji vana Moltke li hêlên Kurdistan'ê der bi der gerîya ye û xerîteka Kurdistan'ê derbixe gellekê xebatan kirîye. Hesabên ewê çewa Kurdistan di bin vê rewşê da bêyî rawestandinê ku ji alî heyet, ref û berpirsîyaran ve ev yek dihate meşandinê û têyî zanînê ku piştî van hesaban gellekî qetlîam û êrîş pêkhatine. Ku emperyalîsta Almanya împeretorîya Osmanîya daxistibû nav lepên xwe û li hember her pêşveçûn û tevgerên gelê hêlê mîna darê zerp û êrîşê bikardianî. (Ku burjuvazîyê Tirk li ser bingehê têkilîya Îngilîz û Almana pergal girtîye, ku di vî alî de "pan-Türkîzm" pêwîste were bîranînê.)




Di pêvajoyeka guhrandî û rola hêza bi awakî din be jî mîna ev têkilîya kevn ji nûh ve derî holê bibe. Ji dîrokê ve ku talanbazî û kevneperestî bûye taybetê burjuvazîyê Tirk îro di sedsalîya 20an te vê rola xwe ya dijwar û nemirovî dileyîze. Ji ber vê zanevîna taybetê ye ku ger di alî êrîşbazî û amanckarîya binxistina Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan û êrîşbazîya ser gelên hêllê mirov şaş namîne. Dîsa di vî alî de, pêştir USA û hêzên emperyalîst ku Kurdistan'ê de hêz û destikên şerî pêktînin, nîşane ku ev karbûn ji wan re tiştekî çarenîne.

Ji ber di rêberîya PKK de ewê tevger û tekoşîna serxwebûna Kurdistan rêya hatin û rizgarîya netewên Rojhelata-Navîn vebike û hêza emperyalîzm ji hêlê hilde, ji van taybeta ye ku emperyalîzm û cunta faşist hemû pêkanîn û destikên xwe ji bo girtina vê rêyê dixebitînin. Û vê xebateka çarenînî dibînin. Pêwîste ev bêyî kifşkirin ku ji pirsgirêka Kurdistan'ê re ne tenê gelên Rojhelata-Navîn û gelê Tirkîyê gelên cîhanê jî bi giranî baldarî wê ne.

Ku ev yek bi karbûnên emperyalîzm û ji xeynî ceşê Tirk, pêkanîna "hêza çeleq", firahkirina balafirgeha Wan'ê û ku vê hêlê dikin cîhgera leşkerî hwd. daxûyanê holê dibe. Di vî alî de tewr û êrîşên burjuvazîyê Tirk tenê neyê karbidestên sazûmana Tirke yên emperyalîzmê ye ji. Nexa-

sim ew gerên demê dawîyê çi li Wan'ê pèktêyî daxûyanê holê dike. Ev yek tê zanînê ku, pêxwasên Şah, ajanên Îraq hwd. li vê hêlê dicivînin û li Wan hêza ceşî avadikin. Nexasim ji Evren, gera Turkmen, hatina Haig û berpirsîyarên parasvanê tixûbê Alman ku li vê hêlê gera wana ji hev û dû qut nebû. Amanca hêza emperyalîzmê çîye, daxûyanî berçavan dike û ev yek ji nuha ve aşkere dibe. Gellek zelale ku ji vê ne tenê pîlanên binxistina tekoşîna Kurdistan, zerp û tevgerên ser Sûrîyê, Libnan û heta Îran'ê tevger û hêza dij-şoreşgerî bikar tînin. Ku bêyî bîranînê sala berê, piştî hatin û çûna berpirsîyarekê USA şerê Libnan'ê destpêkiribû. Û dîsa dema gera berpirsîyarê Amerîkî da, gef û zerpên ser Sûrî zêdetir bû. Ku di çûn û van hatinan de tam ji di dema tetbîqata "hêza çeleq" de êrîşa 25ê Gulanê li ser Kurdistan a Başûr pêkhatibû. Ev yek bi taybetên xwe daxûyan dikin ku pêkanîn û tevgeran karbidestîya Tirk ji hêla NATO bi destê generalan tê kifşkirinê.

Di vê meha bihurî de du serilêdanên pêwîst pêkhatin. Yek ji vana serilêdana berpirsîyarê parasvanîya tixûbê Almanya, ku bi peywendîya navbera rêxistinên parasvanîya herdû dewleta gihîşte dawikî. Di alî tevger û pêkanînên xwe cunta faşîst li kêleka USA vî dostê xwe yê berê herdem dibîne û Almanya bi hemû destikan alikarîya vê sazûmanê dike. Û ew amanca "efsana Rojhelata" di vê demê de ji nûh ve tê holê ku hunermendîya emperyalîstê Almanya tevî vî karî dibe, ku parvekarîya gelan pêktîne ev hunermendî dibe bersîva xwestina burjûvazîyê Tirk û di vî alî de hev û du bêmecal nahêlin.

Ku hemû leystik û fenên burjuvaziyê Almanya di tixûbê Almanya-Rojava-Rojhelat de bi hemû hêlên cîhanê tê zanînê, dibî ku burjuvazîyê Almanya vê hunermendî û pêkanînên serhatinên xwe pêşberî burjuvaziyê Tirk bike.

Lê, dibî ev bêyî kifşkirin ku Kurdistan ne Almanya ye. Ku di nav hemû dijwarî û pêkanînên nemirovî, kuştin, xwîn û barûd û têlênpêçayî de gelekê ku ji hebûna van têla ve hemû dijwarîyan daye pêşîya xwe û van têla nasnekirîye û ji bo hilavêtina van têlên pêçayî tekoşînê dike, bi hemberî rawestîye.

Bi hemû taybetên civakî, aborî û cîhnîgarî Kurdistan welatekê xwedî taybetên xas e. lê di vî alî de belkî zanebûna berpirsîyarê Almanî kesî xebata têlên pêçayî were ji xwe têyî zanînêku li hemû hêlên tixûbê Kurdistan'ê gundên stratejik pêkanîne û gel li qampên dorgirtî bicîhdikin û têkilîya wana bi vî awayî dixwazin ji tekoşînê bibirin.

Bellê, hemû taybetên van gera aşkere bûye. Ku 14 Êlûnê balafireka Tirka li Kurdistan a Başûr hate xistinê. Ma hewce ye îzah bibe: ew pîlotên ku dibên bi paraşûtê xwe avêtine çi dikirina?

Di wê demê de zerp û gefên ser Sûrîyê zêdetir bûn, ceşê Tirk xwe li hêlên tixûb bicih kir, jibona kû tevgera êrîşîyê pêkbîne, şerekê navnetewî li ser hêla Libnan'ê sazbû, bi gef û zerpan sazûmana Îran'ê xwestin ku paşbixin hwd. Yanî li vê cîhgerê pîlanên tevgerê gav bi gav pêkanin.

Hatin û pêkanîn ewê çi derî holê bike? Karbûn û tevgerên emperyalîzmê êrîş û gefên wan heta ku ewê here? Ev pirs di pêkanînên rojevî de her gav bersivên xwe dibînin û ewê zelaltir jîyan bersiva wan bide.

Dewleta Tirk di hêlê de axatîya şer dike. Ev pêkanina li gor mafê emperyalîzmê ewê bêyî domandinê. Û ewê ji bo binxistina Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê hê pêştir bikeve û di vî alî de bê qeyd û bend piştgirtîya van hêla ewê bibîne û ji bo jîyana vê sazûmanê ewê xwîn bidinê.

Lê, ev yek bêmecalî bixwe ye...! Bi van têkilîyan serkarîya serdarên Osmaniya hin dirêj bûbe ji îro ev yek kêrî tu tiştekî nayin, hêza kêrhatina wan nemaye. Lewra, burjuvazîyê Tirk hêzeka pûç e û reh'a jîyanê lê nema ye, ew hêza wî li pîya dihêle, hêza ceşî ji xwedî çi taybete ew jî di êrîşa Kurdistan a Başûr de aşkere derî holê bûye.

Di vî alî de sîstema beş pûçîyê hêza emperyalîzm, ne jî hêza pûç sazûmana karbidestên Tirk dibî ku ne xwedîyê gellek hêvîyan bin. Di serîde welatê Kurdistan û hemû hêlên Rojhelata-Navîn ne sedsalîya 19an de dawîka sedsalîya 20an de dijîn û rewş guhrandîye. Hatineka ronahî li pêşîya gelan xûyan bûye.

Dawîya sedsalîya 20î ewê bibe destpêkirina dema hatineka ronahî ji gelên Rojhelata-Navîn re pêşveçûnên rewş û demê ji neha ve vê mizginê didin.

## *"Derîyên me ji wan re vekirîne... Hêvîya me ew in... Tenê ew dikarin xwedî li mafê me derkevin... Ew lawê me ne"*

*(Destpêk di rûpelê 13an de ye)*

rinê. Dema di peyvê de navê wan tê zman, vê dibêjin; **"ew mirovên ji bo me nayên jibîrkirin"**. Ji zaroyan hetta 70ê salîyan bahsa Mazlum, M. Hayri, Delil, Zeki, Baki Kahraman, Şükrü Sever, Kazim Aydın û hwd. dikin. Gel bixwe dibêje ku, me wan ji bîrnekirîye. Emê ji cuntayê pirsa xwîna wan bikin.

Di hemû pergalên jîyanê, dawet û civînên xwe de kilam û helbestan li ser van hevalan derdixin.

**Pirs:** *Dema dawîyê, cunta leystika demokrasî dileyîze. "Vegerandina demokrasî" û "hilbijartinê" derî meydanê kirîye. Li hember vê, gel çi dike?*

**Bersîv:** Ji binî ve baldarîya vê yekê tuneye. Min ji gelekan pirsî; haya wan ji "hilbijartin" û "partîyan" nîne. Rewşeka wilo hebû ku ji mirovtirê, "rewşa hilbijartinê" nîne. Jixwe hemû tiştî karbidestên cunta bi dilê xwe dikin. Ji vê karbidestîyê jî gel têkilî tu tiştî nabe. Ji alî din ve tê zanîn ku "hilbijartin" ne rêy e û rewşa wa bi vê naguhure. Evê domdarê polîtîka karbidestan bin. Ji ber van taybetan ji ne baldarên "hilbijartinê" ne.

**Pirs:** *Vê dema tu li Kurdistan'ê mayî rewş û pergalên hêza qolonyalîst çewa xuyan dibû?*

**Bersîv:** Der û hêlên Kurdistan'ê, çîya û rêyan ji nûh ve kifş dikin, zangerên vê yekê şandine Kurdistan'ê. Di alê hêza eskerîyê de xwe ji nûh ve bi cih dikin, hêlên "stratejîk" û cîhgerên eskerîyê ava dikin.

Dilnexweşî û dijberî di nav ceşê qolonyalîst de heye. Hemberîya cunta heye. Li Çolemêrgê bi "înzibatek"î re peyivim. Ku hînbû ez Kurd im, kêfxweş bû û got; **"loo, tu jî Kurdî, ji hevalên xwe yê Kurd ra dibêjim, her tişt ne wekî tê xuyakirinê yeee... Hemberî û dijberî heyeee... Em bi leşkerên faşîst re xwarin naxwin, car-bi car di nav-bera me de şerr derdikeve."**

**"...hevalekî ji Agirî hebû... Di navbera wî û leşkerên faşîst de dijberî derket. Faşîsta gilîyê wî kir û ew rakirin birin. Jê pê de haya me jê nema. Dawîyê min ji malîyên wî pirsî, vî hevalî kuştine. Û wî şandine welatê wî. Morê li tabûta wî dane ku "nayê vekirinê" û di nivîsa ji malîyê wî re şandine de ev yek hatiye nivîsandinê: "xwe kuştiye"(!)** Peyva me gellek dirêj bû, dawîyê "serfirazîya şerrvanên Kurdistan'ê" xwest û em ji hev veqetîyan.

8.10.1983

# "Derîyên me ji wan re vekirîne... Hêvîya me ew in... Tenê ew dikarin xwedî li mafê me derkevin... Ew lawê me ne..."

*Karkerê Kurdistan'ê ku li dervayî welat xebatkar e. Rojên xwe yê betalî ji ber ku li Kurdistan'ê derbas kirîye, axaftin û hevpeyvînê bi vî karkerî ra pêkhatiye ji ber ku rewşa gellek taybetan daxûyan dike, em weşandina vê hevpeyvînê, karekê pêwîst dibînin.*

* * *

**Pirs:** *Nêzî meheke keysa gera welat bi dest te ket. Di vê demê de; ji bo jiyana gel, debar û pirsgirêkên hember diminin çi têgihîştinê te çêbû?*

**Bersîv:** Destikên debara gel gellek jarbûne. Birçîbûn û belengazî zêde bûye. Bêkarî gihîştîye qeyseka bê hesab. Piranîya gel bêkar û betal e.

Hejmara kesên heywana xwedî dikin, ro-biroj kêm dibe. An jî yên erd dajon, ji alî din ve, hebûna di destê gel de jê tê sitendinê. Gelên belengaz bi van pêkaninan belengaztir bûye. Berê, kesên betal, bêkar, diçûn bajêran û dixebitîn. Kar bidestê wan diket. Ji ber rawestandina avakirina avahîya ji ev yek ji binî ve ji holê rabûye. Nîşaneka berbiçav ev e ku çaygeh tucar vala nabin, hertim tijîne.

**Pirs:** *Başe, ev rewş çewa tesîr li gel dike?*

**Bersîv:** Gel bi tevayî hêvîya xwe ya cuntayê birîye. Ev hêvî nema ye. Pê dizanin ku cunta ji pirsgirêkên wan re nabe bersîv, û bersîvan nayne. Di vî alî de ez dikarim vê yekê nişan bidim ku; dema li çaygeha gund rûdiniştim (ku li çaygehên gundên din jî rûniştim) bi piranî ev yek têne peyvandin: bi hatina cunta belengazî, birçîbûn, betalî zêdetir bûye, cunta wan dişêlîne û pirsa dijî hilweşandina cuntayê ye.

Hin kes di vê rewşê da rêya felatîyê di tiştên din de dibînin. Mesele aliyê barê debara ev kesê maliyê wî li ser milê wî ye dest bi vê rêyê dike. Ku pêşîyê cotkarî dikira û bi kêmasî debara xwe dimeşand. Lê ji bêkarî, buhabûn hwd. rewşa jîyanê ji binî ve guhurandî ye. Ji av û nan pêştir tu tişt di dest da namîne. Li ber vê rewşê ev gundî hew hedan dike û dikeve kadînê derî li ser xwe digre û agir berdide kadînê. Ku vê yekê gundî dibihîzin, têne alîkarîyê u gundî, di rewşeka bêhişî de derdixine derva. Çima te wilo kir? Dema me pirsan jê kir van bersîvan da: **"mirin ji jîyana wiha çêtire"**. Dîsa ez vê bêjim ku ev tenê hikereke. Gellek kes bi cudatî dest davêjin tiştên wiha...

**Pirs:** *Mîna tê zanîn bi 12 Îlonê ve hêzên şoreşger di xebata welat de bê keys man, û bi giranî xwe karê tekoşînê kirin. Di vê dema karbûn û ger bi xebata welat ve gavên şoreşgerî têne avêtinê, mîna agahdarîyên te çêbûn, ev yek çiqas li ser gel tesîr dike û gel bi çi awayî li wan pêkanîna dinêre?*

**Bersîv:** Berî hemû yekan ez dixwazim vê bêjim: dilxwestina gel bi alî şoreşgeran ve ji berê zêdetir bûye. Jixwe gel ji cuntayê acise. Dema eskerek, erebeka eskerî dibînin dest bi çêran dikin...

Gel ji şoreşgera, nexasim ji PKK bi giranî dipeyive. Hemû vê yekê dibêjin: **"derîyên me ji wan re vekirîne... Hêvîya me ew in... Tenê ew dikarin mafên me biparêzin... Lewra ew lawên me ne..."**

Tiştê ku bala min kişand ev bû. Wê jî bêjim: kemilandin û çeleqîya gel min dît. Gellek kesan xebat dikir û hilweşandina cuntayê dianîn zman. Hemû hêl, kes, xwedî lihev dertên, hevgirtina wan dikemile. Hevdû tenê nahêlin. Nexasim, hemî tiştên konevanî dipeyivin. Nexasim xort û keçên zane, gund bi gund xebat dikirin. Heta hin ji van kesan min bi xwe dît û rewşa guhrandî ber biçav dikeve.

**Pirs:** *Di vê rewşê de derheqê hatinê de gel çi difikire?*

**Bersîv:** Derheqê hatinê de dikarim bêjim ku hemû hêvîya gel bi şoreşgeran girêdahiye. Hiş û baldarîya gel şoreşger in. Mîna her roj çavrênîya wan bikin.

Ev gotin di peyv û jîyana gel de cîh girtine: **"Em Kurd in. Helbet em ê ji destê van celada xelas bibin"**. Dema li Dersîm'ê bûm hê jî germîya êrîşa Kurdistan'a Başûr di nav gel da hebû û ev yek dihatine gotinê: **"Şer li Kurdistan'a Başûr destpê kir. em jî, em biçin şer..."** Ji alî dî ve di radyo, televîzyon û rojnaman de derheqê êrîşê de karbidestan daxûyanên xwe dîyarî dikirin.

**Pirs:** *Êrîşa Kurdistan'a Başûr bi çi hemberîyan di nav gel de tesîr kir?*

**Bersîv:** Alîyên Kurdistan'a Bakûr ji nêz ve li ser êrîşê diwestîyan. Baldarîyeka bi hêz hebû. Gel dizane li vê hêlê şervanên PKK û şervanên Kurd'a hene. Di nav gel de dihate peyvandinê ku cunta qolonyalîst dixwaze ji nûh ve qetlîamên wek Zîlan, Koçgirî, Dersîm, Genç û Hênê pêk bîne.

Piştî êrîş û tevgera hêza qolonyalîst betal û pûç ma, hêvî û dilxwestina PKK di nav gel bi hêztir bû. Gel di peyivîya ku di nav-bera hêzên sazûmanê û şervanên PKK de şerr derketîye, Û hêza qolonyalîst li hêla şerr gellek cendek berdaye û vekişîya ye. Derheqê vê de, gel vê yekê digot ku; **"hêza dijmin bi hêz û refên PKK nikaribîye, û ji bê mecalî vekişîya ye"**. Gel bi vê gellek kêfxweş e. Vê neticê jê derdixistin û digotin ku; **"emê karibin Kurdistan'ê ji destê dijmin derbixin"**. Dema vê gera xwe da vê yekê ji hin bûm ku, di êrîşê de hêza qolonyalîst gellek leşkerê Kurd ji anîye. Lê, evana li hember welatîyên xwe çek neteqandine û wan paşve şandine.

**Pirs:** *Di vê pêvajoyê de, hêza qolonyalîst di derheqê şervan û rêberên PKK da biryarên bidarvexistinê sitend. Ev yek bi çi awayî tesîr li ser gel dikir?*

**Bersîv:** Êrîşbazî û zerpa qolonyalîsta û berxwedanên girtîyên şerê serxwebûnê, hertim di nav gel de tê peyvandinê. Li hember biryar û zerpên girtîxanên gel radiweste û dijberîyeka fireh afirîye. Ev yek digotin ku; li hember kuştina lawên xwe, bêdeng naminin. Li girtixanên Eleziz û Dîyarbekir hevdîtin qedexe bû. Lewra dihate gotinê ku li van hêla tevgera birçîbûnê heye.

**Pirs:** *Ji bo şehîdên girtîxanan, çîyanan û şervanên PKK re çi tewr di nav gel da hebû. Vê yekê bi çewayî didîtin?*

**Bersîv:** Hevalên şehîd nayên jibîrki-

*(Dûmahîk di rûpelê 12an de ye)*

# *"Ez, Dilxwazekî PKK, Bi Şoreşgerê Wusa re Serbilind im"*

Dema ez dibin çav de mam, rastî hingavtinên dij mirovî li ser min û yên cem min kirin. Û ez bixwe van tiştan jîyam. Dema min birin Ruha'yê, xofa di dilêmin de bû, ano min hêdî-hêdî pirsa çi li wê derê têkirin kir. Lê, tenê min ji yekî bersîv sitand. Ya rast ji rûçikê wan kufşbû çi li wir dibe. Lew li dest, ling û rûyê wan babet şûna hingavtinan, têrî têgihiştina vê dikir.

... Piştî çendakê, navêmin hate xwendin. Çavên min girtin, min rakirin û birin deverek din. Çavêmin hewqas hijd girêdabûn, min nikaribû bêhna xwe bidim-bistînim. Neşaşbim 4-5 kes li dora min hebûn, berî ku dest bi pirsa bikin, min got *"çavê min hebkî sist bikin, nikarim bêhna xwe bidim-bistînim"*. Gotin *"bila be"*, lê girêkê hê zêdetir jidandin. Ji min re gotin, *"haydê lawo! binêrê hun tev di destê me de ne, ger tu bersîva pirsê me nedî, emê te bikujin, binêre hevalên te tev peyivîn, me çend kesên ne peyivîn kuşt, ji peyvê pêştir tu çara te tune."* Pirsa ewil *"tu endamê PKK yî"* bû. Qasekî sekinîm, min bersîv neda. Hingê di nav xwe de gotin *"serok, em xwe bidin naskirin"* û nêzî seetekê min dibin lêdanê de hiştin. Piştre av bi sermin dakirin û min tazî kirin. Dîsa min li ser piştê dirêjkirin û bi pihîna li ser û zikê min xistin. Pênc kesa bihevre, ji nîv seetekê zêdetir bi wî awayî li min dan. Piştre yekî got *"wan qayişa binin..!"* Bi min re qîriya *"haydê, seh rûne!"*. Ne rûniştin, xwelibitandina min jî bêimkan bû. Dema nihêrtin ez nikarim xwe bilibitînim, du kesan min rakirin, yên din jî dest bi lêdana bi pihîn û kulman kirin. Piştre yekî bi min girt, yên din jî herdû destên min biheve hijd girêda, jê pêve deng jî ji min dernediket. Ji destê min ve, min bi kêran (ezmanê xanî) ve girêdan, qederê 3-4 seeta daleqandî mam. Dema ez daleqandî bûm, neşaşbim qet kesek li dora min nemabû. Lê dengê yeke ku di bin hingavtinên giran de, dikete guhemin. Pîrekê çêr dikir û digot *"ger ez zanibim kekê min likure ji nabêjim, wun nikarin min bidin peyvandin, ne ji we, ne ji yên wek we û piştgirtekê we cunta xofa nakim"*. Wekî din digot *"ez dilxwazê PKK me"*.

Bawerbin hingê mêranîyeka wusa kete dilê min ku, min xwe ji ev fikra "ya rastî jî sedemê mêtinger hewqas bi ser me ve tên, ji tirsa van berxwedan û ji tirsa serkeftina me ye" negirt. Piştre derbasî oda min bûn, bi çêr û pêçariya *"kêm be ji te me naskiriye"* gotin. 5-10 deqan bi halê daleqandî li min dan. Lê piştre yekî got *"serok vêgavê hewqas bese"*. Li ser vê min ji wê odê rakirin, dîsa birin oda xilbe ya din. Leşkera li wê derê paçikê ber çavêmin vekirin, lê ez li cîhê xwe ketim û nikaribûm xwe bilibitînim. Hemû kesên li wir di bin çavan de li min dinihêrtin. Lew wê êşê wan jî dikişand; paşî li ser daxwaza leşkera min kişandin enişka dîwar. Kesek hêdî nêzî min bû û bi dengekî nizm got *"rêya rizgariyê hew di vê rêya tekoşîna me ya bi maf de di derheqê tiştekî de nepeyvandine, wekidin neqebûlkirina tiştekî din e. Ew ji tirsa PKK van hingavtinên dij mirovî dikin"*. Û gotina xwe hêdî berdewam kir, got *"ger em bersîva erinî nedin wan, ewê tirsa wan roj bi roj zêde bibe û ewê hingavtinê hê zêdetir bikin. Rêya tekoşînê ye, ji vê pêde tu rê tunin"*. Ev gotin ji min re bûn kaniya mêraniyek mezin. Ez, yekî dilxwazê PKK, bi şoreşgerê wusa re serbilind im...



Êdî bûbû êvar, hê avê nedidane me, piştre şîvê anîn. Xwarin têra zarokekî jî nedikir. Min nekaribû xwarinê bixwum. Lew ne xwarin xwarin, min nikaribû erçena xwe jî bilibitînim. Ji ber vê min got ez xwarinê nikarim bixwum. Wana gotin *"ger tu nikaribî xwarinê bixwî, emê tiştekî dinê ji te re bînin."* Qasekî derbasbû, pîsiyê miroveki li ser kaxezekî anîn dirêjî min kirin û gotin *"ha ji te re bixwe."* Dema min nexwar, yek li qoqlika min siwar bû, bi zorê bi min da xwarin.

Bi gir, hêrs, êşa hingavtinên dij mirovî min xwest ez bê dengderxistin wê şevê derbas bikim. Lê razan li kure. Di nav êş û sancûyan de vir de wirde min xwe diqeliband, avşorkê ji weke nav û dilê min dianî xwar. Şev seranser, bi nalîna şoreşgera ji ber hingavtinên biroj tên kirin, derbas bû.

Lew lêdana li wan dihat kirin, ji ya li min dihat kirin gellekî zêdetir bû. Ez, ku dilxwazê PKK me, ev lêdan li min dihat kirin; ne zehmet bû li ser lêdana li endamên PKK dihat kirin, bê fikrandin...

Wê şevê heya sibehê ez di fikra sibê çi bînin serê me, em ê leqayî çibibin de mam. Ez nikaribûm ne rûnim, ne jî xwe bilibitînim. Laşê min bûbû weke text. Em li ser erdeka cemidî û hişk bûn. Werhasil şefeqê lêda. Neşaşbim seet dor 7a bû. Gazî du şoreşgeran kirin, çavên wan girêdan û birin. Di nav re 5-10 deqe derbasbûbû, dengê kulm û pihîna hat. Neşaşbim ev ode pir nêzîkî me bû. Yek ji ê bribûn berxwedida û digot: *"her tiştî min kir, vî hevalî naznakim, ez piştgirtê PKK me."* Yê din liber lêdankara digerîya û digot *"ez vî mirovî nazdikim, ewî navdiminda, ewî min kir şoreşger, minê mala xwe bibira Stenbolê, lê ewî min tirsand û nehişt."* Bi vî awayî tiştê zanibû, eşkere kir. Lê li gel hemû alîkarîya bi dijminre ev kes ji hingavtinê ne filitî. Bi serde jî lêdankaran zêdetir lêdan lê kirin, û digotin *"bêje hê gellek tiştan zanî, tevî bêje."* Li gel vî mirovî hemû tiştî eşkere kir jî, lêdan kêm nedibû. Li ser vê yekê pîkolî li ser şoreşgera zêde kirin û digotin *"haydê binêrin hevalê te çawa hertiştî eşkere kir, veşartina te feyde nake, zû bipeyve."* Hevalê berxwedar, timî diberxwedida û di serde ji digot, *"dîrok wê cezayê we bide we."*

Piştî 5-6 kesan, navê min hate xwendin, çavê min girêdan, min birin. Vê neqla dûwemîn jî bi sedan pirsan pirsin, digotin *"ne hewceye tu qeşmerîya biki, bersîv bide."* Gava bersîvê erînî negirtin, dîsa min xistin bin lêdanê. Paşî min tazî kirin. Serê qebloki bi guhê min ve yê din bi ........ min ve girêdan û eletrîkê berdan canê min. Tesîra vê hingavtinê da ser min, ji mal zêdetir manewî bû. Ji dêlva van hingavtinên cankuj, min dixwest fîşekekê berdin mejîyê min, min bikujim. Bêdilê xwe qîrîn ji min derket. Nemabû bêha min biçikîyana. Gava vê yekê dîtin, eletrîkê qut kirin. Lê piştî 5-6 deqa dîsa dest pê kirin. Ev 15-20 neqla bicîh hat. Pir tî bûbûm. Dema min av xwest, li min vegerîyan û gotin, *"tu bipeyve, emê te di avê de bihêlin, hetta tu bixwazî emê avê bi te bidin vexwarin."* Wê gavê çun, mida fikirandinê ji min re hiştin. Lê min di dilê xwe de helbestên berxwedanî got, min bersîv neda, li ser vê weke gurê har, dîsa êriş anîn min. Piştre bi awayê kaşkirinê min birin odeke din. Dî wî halî de min xistin hundur. Hundir, tije av bû; avê diavîte erçena min, û pir teng bû. Ji lêdana li min kiribûn, nava min dişewitî, ji hal ketibûm. Wê qasê min xwest wê ava pîs vexwum. Lê ji pîsbûn û xwê ya tê de min nekaribû vexwum. Xureka wûsa ketibû canê min, weke agir girtibe min. Birînê min êşeka pir xedar didanmin, jan ji dilê min diçû, canê min pir dixwurîya. Ji ber vê min jî heta ji min hat xwurand, nexasim piştî min hinekî xwurand, herdû milên min diber min de ketin. Neşaş bim nêzî 3 seeta di wir de mam.

.............

Ku dîsa ji min bersîva erînî nesitandin, hinekîdin li min dan, piştre min birin mezelê ku şoreşger têde ne. Piştî lêdankar çun, leşkera çavên min vekir in. Du kesa min hêdîka birin tenişta dîwar. Hogirek nêzî min bû, got *"tu li wanê hertiştî eşkere dikin nenêre, ji xwe ewa dev ji tekoşînê berdabû."* Ya rastî serê mirov bi van peyvê şoreşgera bilindtir dibû.

Paşî miroveki kal anîne cem me. Hevaleki ji zilamê kal pirskir *"apo ma sûcê te çiye? Zilamê kal bersîva vê pirsa ku bi dengekî nizm hate kirin wiha da; "min qederê 60 donimî pembû çand. Di kêleka pembû, ji hêla din ve 2 kes derbasbûne, ji min re dibêjin: bêje ma ew kes kî bûn, nevê wan bêje."* Min nedibû ku derbasbûne; derbasbibin jî ezê ji ku navê wan zanibim. Navê kesê di ser erd de derbas dibe nikarim bipirsim. Lê gotin *"na, na tu wan kesa nsadikî, tê bêjî."* Wekî din jî digotin *"em bêjin tu navê kesekî nizanî, navê şoreşgerên dinê yê tu zanibî bêje, ger tu van jî nizanibî; bêje danûsitandina şoreşgera bi kî re heye, diçin malên kî, kî di derheqê şoreşgeran de bi erînî dipeyîve, miheqeq tê zanibî..."*

Bûyerekê qet jibir nakim. Wan rojan zarokeki 11 salî anîbûn. Di koma 4a de dixwend. 4 seeta li wî zarokî dan, lê zarok timî diberxwedida. Gava bersîva erînî ji devê zarok negirtin, anîn ba me. Piştî zarok anîn, ji seetekê zêde girîya. Dest, ling û devûrû lê werimîbûn, xwînê di dev û poz de diavêt .Paşî dev ji girî berda. Zarok nîv-tazî bû, cileke pak lê tunebû. Îşlikekî qetîyayî û şalekî pînekirî lêbû, ling tazîbû. Weke di nav avê de be dirihilî. Hêdî hêdî min xwe rast kir û min dest jêre kir (weke bêjim were vir). Min pirsî *"ma sûcê te çiye".* Qasekî xweş ma, bersîv neda. Paşî got *"jî te re çiye!".* Ew li zaroka jî çavsorî û hingavtinan dikin....

...Hingavtinên li me dikirin, ne weke bê tehamûlkirin bûn. Lê bawerîya min ya bi vê yekê hertim li cih bû: *"şoreş zehmete, lê wezifeka bi qîymet e, ji bo jîyanê berxwedan hewceye."* Hînker ji bo vê min bi çavên xwe dîtin. Serêsibehê gellek hevalan birin, lê venegerandin. *"Me wan kuşt, hêdî hêdî dor wê were we jî"* digotin. Ji dêlva yên birî, hinek şoreşgerên din anîn. Wan ji cîhkî din anîbûn cem me. Hingavtinên li me kiribûn, li wan jî hatibû kirin. Ji xeynî hinek xwesipara, berxwedan didomîya. Li vir gelek bûyerê êşê dixistin dilê mirov jî hebûn. Herwek hin kesên berê refên pêş yê PKK de cih girtibûn , alîkarîya bi dijmin re dikirin. Bi vê rewşê jî, dibûn sedemê zêdekirin tehba ser şoreşgeran. Zirardana wan bi vê jî nediqedîya. Ew bûn sedemê girtina gellek welatparêzan...

. . . Şoreşgereki ku ji min bêhtir lêdan lê kiribûn, anîn cem min. Sê rojan li cem me ma, dirêjkiribû, qet xwe nedilibitand. Emelîyata wî teqiyabû; hewcebû biçe nexweşxanê. Lê wî nedibirin. Piştî çend rojan jî mir. Ji me, îmze ji bo ku di birçîbûna mirinê de mirîye sitandin. Herçuqas laşê wî bi birîn bû, kufşbû ku ji ber emelîyata xwe miribû jî, dîsa bi îmzesitandinê, dixwestin bûyerê sergirtî bihêlin. Ne insan, heywan jî nikaribûn di bin van hingavtinan de debar bikin. Di bin van hingavtinên giran de, gellek şoreşger hatin kuştin, min bi çavê xwe dît . . .

Paşî min ji navendê (merkez) birin tugayê. Li tugayê rojekê seranser ez di bin hingavtinê de mam. Lê roja din me hingavtinên girantir li wê derê dît. Gellek şoreşger li wê derê bûn. Ya rastî cîhê girtîyê şoreşger li Ruhayê (Urfa) nemabû. Lê dîsa jî girtin û hingavtinan kêm nedikirin... Hingavtinên li pîreka dikirin, ji hingavtinên li zilama dikirin ne kêmtir bûn, hê zêdetir jî bûn. Kalekî li cem me wiha digot: *"min û bûka min bihev re anîn û gotin* **'ger tu cîhê kurê xwe nebêjî, emê li ber çavê te destbavêjin bûka te.'** *Ji gotina xwe kêm neman, 4-5 kesî li ber çavên min*

*(Dûmahîk di rûpele 38an de ye)*

# PROVAQASYONA CUNTA FAŞÎSTA TİRK A NÛH: KKTC

## – Komara Tirk a Bakûra Kibrisê–

BÛYERA, ji demekî dirêje pir geft û got ser dihat kirin, ha va telalî bû ha wê xûyan bibe û bi vê bayê bûbû domandina mijûlbûnê, di rojên derbasbûn de li Kibrisê jîngar bû. Cunta faşîst a Tirk, provaqasyona xwe a ji mêj amade kiribû bikaranî û bi navê "Komara Tirk a Bakûra Kibrisê" leyîstokek ku derivandina wê neyî raxist. Bilî daxwestina gelê Kibrisê, hatî leyîstandina ev rûdan, ji bo mafên cunta faşîst a Tirk û emperîalîzmê re pêkhat.

Bilî berî nuhan jî leyîstokek wusa dihat hevbendî jî, hatiye dereng xistin û rojgerana nû de lihevanîn. Di vê pirsgirê de mafên cunta faşîst a Tirk û pêşewar de USA, mafên hemû emperîalîstan, xwe yekbar lihevtênin. Lewma karanîna provaqasyonê de tu tirs û çeper nedîtin, rawestîne, rê nede pêşketinên din. Bûyera ne rast dîtina van biran jî, lewra ye. Balam cunta faşîst ev provaqasyon, bo hîmtir û hêztirbûna xwe bileyîzîne û bikarbêne, birêvekir.

Serî de USA, hemû emperîalîst vê leyîstokê derivandine. Temaşê de, ser dabin du-sê tewrên sexte û rexne li ser daxûyanîya KKTC kiribin jî, azînên bikartênin nikarê vê bîryarê rawestîne û ev leyîstokên emperîalîstan baş xûyanî dike. Bûyereke bi vî awayî, berjewendên emperîalîstan gelek bar û kîryaran de fireh û hatîgihîştî dike.

Bi vê şêwê, bo êrişên xwe li ser Rojhelata-Navîn, Rojhelata-Behrasipî xwestin xela leşkerî bidest bênin.



Herweha ne bêsaloxên û bêagahên vê domandinê; lê ji serî de ew bixwe navde bûn û doman damezrandin.

Hilbijartina 6. Mijdarê de bi rewşa rûçik berbierdê ketî hatîy cunta faşîst, dixwest dawîyên bûyer pêkanîbûn rawestîne. Lewra serî li her babet rê û çaran dida. Eşkere ye ku, dawîya ji hilbijartinan derkete holê, dinav girsê gel de wê behtir rêya mijûlbûnê çakbanîya. Rewşeke wusa ji, wê bibe sedem, daku cunta faşîst nekaribe bernama li pêşîya xwe bikar bêne. Nexasim cunta faşîst daxwaz dikir, mijûlbûna dawîya hilbijartinan li hundurê welata biseknîne û rê nedê ku dijbera civakî hilm li ser sazûmana Özal bimeşîne. Bilî bikaribe bernama xwe seranser bajo serî da provaqasyoneke wusa û xwest pêşketinên li dij bûn, gora mafên xwe bizîvrîne.

Piştî dawîya hilbijartinan agah bû pêde, yekderp pêkanîna sazîkî halo, ev daxwaz berbiçav dike. Nemaze, vê barê de hin birên burjuwa muxalif, bîryareke bi vî awayî ji ber demwext ne rast dîtin. Ev şanî dide ku, cunta bi leyîstokek wusa li hundur, xwest rexne û lomên van biran bo mijûlîyên û beravêtinên dawîyan hilbijartinan Bihevnakiniya dinav berên Yewnasistan û NATO (Pakta Bakûra Atlantik), neberjewendîya NATO bika tê xwestin ji vê cîhgehê; û ji ber Kibris mîna berê ne heremeke ku jê emperîalîzm bikaribe berjewendî hilbigre hwd. Ji ber şirûtên rojgeran, Kibris emperîalîzm nerihet dikir. Nexasim, emperîalîzma USA, Kibris a bi vê babetê pêwîst bû, bê guhurandin. Nexwe ev cîhgeh berdewama nerihetkirina emperîalîzmê wê bajotiba. Bi kîjan daxwazan êrişa Kubayê dikira, ger tehlûka mîna Kubayê nebe ji, bikaranînên dijbehîn dixwazê li vir jî birêbixe. Ji ber nedikarin seranserîya Kibrisê bidest bixin, li bakûr karanînek wusa zakirin.

Bi vê bingehê sazûmana derxistin berçavî, daxwaza emperîalîzmê ye ku di vê heremê de, hêlên alozî û êrîşbazî bê îfade kirin; û ev ne tişteke din e. Ji vê hêlê, mîna dixwazin wê maf bikşênin û ji vir êrîşan sazibikin. Weke ku ketî weşanan ji, di serî de USA, hemû emperialistan, çawa wê ev der ji xwere bikarbênin, hînkereke vekirî ye.

Ji hêla din, armanc û ramana paş-dehfandina huku-

meta Yewnanîstan jî, xwestine. Ûşteke "erê" gotina emperîalîstan jî ev e. Halo dixwazin, hukumeta Papandreu bidehfênin enişkê û bidin erdê. Gerek, bihevnekiriyên ku hukumeta Yewnan dinav NATO û AET zadike, gerek ji dîtina gelê Yewnan vê barê de emperîalîzm pir dijwar bêqeys dike. Bona bikaribin ev hejîneki bê mecal bikin, ev hecat serrêxistin, û ev provaqasyon damezrandin.

Ji ber van hemû sedeman, herçuqasî dixwazin ev bûyer bê zanîn û têkilîya cunta faşîst a Tirk, USA û emperîalîstên din şanî bidin jî, ne wusa bûna vê dîyar e. Şexsem, ev provaqasyon ji hêla van hemûwan bi şirîkatî hatîye amadekirin û domandin. Herçuqasî emperialîstan ser vê bîryarê rexne kirin jî, di vê korşerê de alîkarî û piştgirtina provaqasyonê dikin, û ev rastîkî berçavî ye.

Li ser van, ji ber rûdan û pêşderketîyên hêvîdar, navça Îran û Îraqê, ji bûyera Kibrisê hin hînkerên ku mirov derxîne hene. Dijbehê leyîstoka ser Kibrisê hatî berpêşin, dikarê li vê heremê de jî, bê leyîstandin. Sazûmana Tirk, ji serborê dixwaze Kerkuk û Ezerbeycan (a bin karbidestîya Îranê ye) bike bin serdestîya xwe. Dema pêşîya me de, mîna li Kibrisê çêkirin, heye li van deran jî ev pêşî bixin. Herweha bin navê "rizgarkirina" nîjada xwe ê Tirk, ser Kerkuk û Ezerbeycanê dozek wusa tevgerîn bike û merhelan de "çêbû-xelasbû"yan, zadar bikin. Serpahtîya dîrokî û rewşa îroj bo vê yekê pir lihevtêtin. Çawa dîrokê de bi zorê, "çêbû-xelasbû"yan pêşketîye, dixwazê îroj jî bi van rêyan û azînan, xwe hatîgihiştî bike. Lewma kîjan heremê de ûşt û şirût çêtir pijîyabin, van merhelan de rûyê xwe ê gemar û vereşîne daxûyan dike, û ji vê qet xwe nade paş.

Rewşa ku îroj herba dinavberê Îran û Îraqê dîyar kirîye, ji ber ku li dijî cuntaya faşîst xusaran derdixîne û li hember nexweşîyan didaristîne, dewleta Tirk heye xwe têkilî van cîhgehan bike û êrişan bajo. Hînkereke mîna Kibrisê, jê re ispateke ku cunta li van deran jî rûdanan pêk bîne. Ji xwe tê zanîn, hazirî û amadeyên ser vê barê, ji mêj de hene.

Li hundur û derve êrîşbazîya xwe di vê taxê de bilind û zêdekirê cunta faşîst, ji ber xwehebûn û qerekterê xwe a harûhov û neyarî li hemberê gel, pêşîya alema gişî ya dinyayê a pêşveçûyî birabirin bûye û bêkeys ketîye. Bivê babetê, "çêbû-xelasbû" ya Kibrisa Bakûr û dîrokê de sazîya dewleteki bi vî rengî kêm bê dîtin de, daxûyanî û dîyar kirin, ji 3 salan virde ye, pîkolîya bikarhat, lêdan, hingavtin û ji ber qirkirinan bi bareke giring jê hêla alema giştî hatîye rewşa pîşangî û tenê mayînê cunta faşîst, ji vir û pêde leztir û zûtir wê rabirin (tecrît) bibe.

Ev pêşketin, wê bersekiniya û xweragirtina alema giştîya cîhanê hember cunta faşîst gelektir têdayî bike, domandina hilmdartir bi xwe re bêne. Xaponekên cunta mîna "hilbijartinan û vegerîna demokrasîyê" hwd. nikare rê bide ku berrabûnên alema giştî bide rawestandin. Li gel dij wê, bi van pêşketinan re, sextekarîya leyîstokên vegerînên demokrasî û rûçikê cunta a bingehî çêtir der-


*Gelê Kibris beyana Komara Tirk a Bakûra Kibris protesto dike.*

dikeve berçavî; ev dibe sedema rexne û xweragirtina alema giştî ku behtir mezintir dibe. Di nav rewşa jîngar û heyînî, ragirtin wê li hemberê cunta bi hilm bidome.

Lewra, li ber rewşa ku karbidestên çînên Tirk îroj têda dijîn, dîroka wan de talankarî, vebirin, qirkirin û mîratkarî hêj di mêjîyê gelan de, bi hînker û bûyerên jîngar dagirtîye, û nehatîye jibîrkirin. Ango gelên gêtî, bika hebûna wan a rojgeranî dîroka çînên serdestên Tirk ji pir baş û ji nêzîk nasdikin.

Di dîroka nêzîk de, zeftkirina Hatayê çawa hat pêkanîn, zorbazî û zînat çawa hat birêxistin qenc tê zanîn.

Herweha hovîtîya li Kurdistanê bikarhat û çawa têxwestin li ser gel vebiriyên û qirkirinên girs-komî bê pêkanîn, hêj bi jîngartirîn mêjîyan da cîh dagere. Çînên serdestên Tirk, serkevtina xwe ser Kurdistanê, tenê dikarin bi zor û zînatake bêsînor bajon, bona vê yekê ji gel ji qirkirinan derbas kirine. Ji Palû-Genç-Hênê, Dersîmê, Agirî, Zîlan; bêyî pîrek-mêr-zarok ji hev cuda bikin vebiriyên komî pêkanîn, Kurdistan heta quncikê xwe a veşartî zeft û vegirtin û kirin bin serdestîya xwe.

Îroj ji bin mêtingerîya faşîst, her babet karanînên hov û xedar tê ajotin, ji nas bigrin heta yên nenas dest davêjin her tiştê gel û bikaranînên xwe bendexane û zindanan de, bi hingavtin û kuştinan, hovberîya xwe dighîjînin taqa bilindtirîn. Gelên cîhanê van hemûyan baş nasdikin û rê ji van re vekirê yarmetîya mêtingerîyê ji, vêca bi şêwa xwe a eşkeretir, dibînin.

Avaye ji ber van gişan, mîna serpehtîya xwe rojê wê yên îroyîn ji bi zilma dij-şoreşgerîya har, hatî avakirina cunta faşîst, pêş nezera alema giştî, domana raberî, pişanga û biraberîna (tecrît) wê behtir bileze û protestoyên şêwirtir û dijwartir wê bialife.

Cunta faşîsta Tirk, bona civakeke Tirk bi 100.000an dewleteke derivandina wê neyîn li ser cîhanê, dema dipalîne, gelê Kurd ê 15 milyonan , bin serdestîya xwe digre. Bi azînên ku mirov di qurna nuhan de nikare bibîne, bi destgirtina dilîtî, gel bin nîrê xwe digre û dixwaze gelê Kurd bi zor û zilmê li paşîya jîna hemdemî û hûjen bigre, jîna wê biyanî pêşve çûyînê bike. Bêşerm û fihêtî, derewa

li dijî pîkolîyên li ser civaka Tirkên Kibrisê derdikeve û belavdike, lê belê li Kurdistanê gelek divebirêne, dixwaza hebûna wî ji dîrokê rake. Bi buhatîya çi bibe bila bibe, bona bighîje vê armanca xwe, ku li pêşîya xwe danîye, ser dide hemû rêyan û her babet dinî, harbûn û nemirovatîyê pêk tîne. Pir raste ku ev leyîstok, li ser vê rûçika wan ê dîrokî ye. Serpehtîya dewleta Tirk, seranser bi talankarî, pîkolî û qirkirinan, bi bûyerên ji gelan xwîn dadiwerişand û bi hînkarên her babet hovîtiyan dagirtî ye.

Vegirtina Kibrisê, liqekî ji polîtîka M.Kemal e ku di dema buhurî de dihat pêkanîn, îrojî xwe ji nûhve de dihilmîne. Bi vê bûyer û serpêhatîyê, cunta faşîsta Tirk çak şanî da ku "Ataturk"vaneke baş e. Tiştê cunta faşîst nuha dikê, divê ji Kemalîzmê ne cuda bê dîtin. Ew ji ber daxwaza Kemalîzmê xwe didin ser van rê û rêçikan. Çawa serborê de, Kemalîzm; di Kurdistanê de vebîr pêşdar kiriye, Hatay wergirtîye, dijminahîkî har li dijî karker û gundiyan birêxistîye; cunta faşîst jî, li gor rengê ji Kemalîzmê girtîye bi eynî babet û tewran xwe ditewgirîne, pêşveçûyên dijbehîn pêşkêşî dike. Ev avayîya ku cunta faşîst tê ketîye, ji ber van sedema divê ji Kemalîzmê newe qut û cuda kirin. Ne tiştekî din bilî rûçika Ataturkvanîya rojgeranî ye. Bi bûyera Kibrisa Bakûr pêre, behtir xwedîyê serborîya xwe derdikeve û daxwaz dike wêna ji îroj pêde pêwîsttir jîngar bike. Lewma zanistîya û têgihîştîya dîrokê ji nûhve zadar dike û derdixe rojê. Mîna çawa dixwaze xwedîyê Kemalîzmê derkeve, îspat bike, gavên ku Ataturk avêtibû şopîn dike, bi hemû xwexweyîya xwe, mîna vî xwe ditevgirîne, dikurijîne û dilerizine û dixwaze erîşbazîyê bike. Kar û xebata wan a îro, têne ser vê rêyê ye.

Balam di rojên em têde ne, ne rêdare polîtika sextê ku cunta kedxwara faşîst bikartêne biçe serî û jêhatî bibe. Hevaleke wê di Arjantîn de pêk hatî ev zînat û zorbazîya koregirek, dawîya afirande holê berçav e. Mîna tê bîran cunta Arjantîn jî, di sala derbasbûyî de bona danîna xwe bişidîne, daku hêrsa girsê gel ê zêde dibû nequlibe hemberîya şoreşgerî û balên wan bikşêne ser pêşketinekedin û şovenîzmê kûrtir bike û wana rawestîne, Falkland wedigre, li di dawî de pêşveçûnek çewta vê rewşê zadike û berza sazîyê li hundur û derve anîbû qonaxa têkçûnê. Îro cunta faşîst jî, ser dayî ji vê leyistokê û ji ber koregireke li her hêl û merhelan da bikaranî, wê nikaribe pir bihesile, ê sazî bê taxa berrabûna, ji ber van bikaranîna, li hundur û derve kîjan behtir tûji dibin, ber û pêş. Cunta ger ji ber pêkanînên gihan merhelekî, ji ber şîyarîya giştîya gel ku li hundur û derve li dijî vê polîtîkê qewre dibe û ji ber xweragirtinên sadir dibin, wê jêhatî nabe. Bi dem bihurandinê, ger gavên hatin avêtin pak û hêja bên dîtin jî, ger dimeşe daxûyan dike jî, rastî ev hebûna tevgereke ku paşî diçe ye. Heta rojên îro, çînên serdestên Tirk karine bi polîtîkeke wusa jîyana xwe bidomînin, û berdewam bikin. Lê belê, ji vir û pêde, ev hacete jîngarîya wan a bingehîna yeke wê ev rê ji wan re pêk nayne.

Ji nuha pêde, cunta kedxwara faşîst nikare polîtîka xwe a korûgirek di hundur de bajo û li ser vê jî hêj behtir ev li derve jî bimeşîne, rê jê re nemaye. Cunta faşîst, vêca nikare bi zilm û zînata xwe a çargavî xwe jîyandar bike.

Tellalkirina KKTC, keda nayê serrast û helbûna pirsgirêka kûr a cunta faşîst a Tirk e. Ev girgirek, ji aborî ta rêzanîyê li her alîyan xwe pêşdar dike. Hatî girtin û alozîya xwe her barê de, daku paş xwe bihêle, ger ser dabe vê bûyerê jî, wê nikaribe çelekî û çelengîyê li ser rêya berjewenda xwe bisadirîne. Lew, li hundur û derve, bûyerên derketin berçavan, rê nadine vî tiştî.
Herweha ji bona xwe piçekî rihet bike, cunta faşîst ku ser daye vê bûyer û serpehtîyê, wê jêre pirsgirêkên giran derxêne, û ser wê barbike.

Ger cunta faşîst wê ji bin pirsgirêkên hewqas dijwar û giran bikaribe derkeve, rêya helkirinê peyda bike; an ne? Wê bikaribe heta kîjan taxê vê bibe serî? Em bawerin, şansê wê di vê barê de tune ye.

Ev bûyer, ji ber ku keda pergela mezin a cunta faşîst a pêwîst e, dikare serê cunta jî bixwe an rê hilweşandina wê re veke. Ev dikare bê bendrawestandin. Di vê barê de şert û şirût, ji binî nehatî gihîştîne.

## GELO SAZÛMANA ÖZAL MAL Jİ . . .

*(Destpêk di rûpelê 5an de ye)*

hêzên şoreşger û demokratîk, ser bingeha vê fahmkirin û têgihîştinê hazirin ku bi dijberîya borciwazî re, bihevre rêbistênin.

Başe! "Çepê" borciwazîya piçûk a Tirkiye û Kurdistanê, bi kîjan şertan bi tevgeran borciwazî re rê distêne, çima bîrdozên xwe eşkere nakin. Bilî vê zelalîyê, çawa dikarin hewqas bêberpirsîyar pişta xwe biqulbênin şoreşê, û dikarin bi rûreşî êrîşê hêzên şoreşger bikin?

Dîyare ku ev hêzên hana, ser rêya nav ketinê de bi bingeha firotina şoreşê dixwazin çermên xwe xelas bikin û tiştek din ji danafikirin.

Hêzên şoreşger û demokratîk nacarin ku li hemberê vê tehlûkê şîyar bin û xebata dijwar bo birabirîn (tecrit) û pişangekirina (teşhir) wan bajon.

Li hemberê vê "tevgera rawestandina şoreşê" a ku rastûrast ji alîyê sosyal-demokrasîya Awrûpî derketiye holê, divê hêzên şoreşger û demokratîk yên Kurdistan û Tirkiye, ji alîkî rêxistinên xwe yên hundurî seranser avabikin, ji alîyê din jî, bi teqtîqên rêxistinî û tekoşînê yên ku îktîdarê erk dikin, ji hemû tengasî, alozî û derzên rejîmên, ji xwere berjewendî sadir bikin daku bikaribin li hemberê îktîdarê gav bi gav bibin hêzên alternatîf.

Tevgerên şoreşger û demokratîk yên Kurdistan û Tirkîye, wê ne pey dûvika borciwazî û ne ji pay armanca demokrasiya borciwazî wê biçin lê pir ronîye ku ser bingeha rêxistina xwe a serbixwe û ser bingeha tekoşîn û livbazîyên xwe bixwe, bi sazîkirina îttîfak û hevbendîyên xwe yên bingehî û bi piştxweve kişandina hemû hêzên muxalifên din, bona îktîdara demokratîk a gel wê tekoşîn bajon û şerbikin, û bimeşîn karbidestîyê.

Gora vê dîtinê, ser bawerîyên û dîtinên EYBDF (Enîya Yekîtîya Berxwedanî-Dij Faşîzmê) û ERNK (Enîya Rizgarîya Netewa Kurdistan) divê erkên hewceyên pratîk bên pêşvebirin û fîrehkirin. Ev hilbijartinek herî-rastî serbixwe ye. Rojên me de divên hêzên şoreşger û demokratîk mîna me nuha li jor gotî, vê rastîyê ji xwe re bijêrin û bingeh bigrin lewra tu rê din tunin.

★

# BERÎ CİVÎNA CİVATA AWRÛPÎ DÎTİNA GELEMPERÎ



30ê meha Çile hat. Vê rojê de civîna parlamentarên meclîsa Awrûpî destpêkir. Berî civînê, berhevdan û mijulîn li Tirkiye û Awrûpa zêde bibûn.

Mîna tê bîr û hiş, civata Awrûpa civîna xwe a Êlûn 1983an de, biryara ku parlamentarên Tirk civînê de cih negrin derxistibû, lê şêwra bingehîn hiştibû mêjuya 30ê Çilê, dixwestin taliya "hilbijartinan" bişopînin. Piştî dawiya hilbijartinê ku ji hêla hêzên Awrûpî ji nêz dihat şopandin, bilî tu guhurandin sazumana Tirkî de pêşneketibû, hêlwestên Awrûpî xwe şuna "dijwariya" pêşî dajotin, bi rêwşekî "nerm" nêzi Tirkiye kirin. Herwaha, gora salox, agahî û berhevdanên gihan alema giştî, bo vê civînê bilî baweriyên ser civînê sê dîtinên din xwe aşkere dikin. Yekemin; divê Tirkiye civînê de cih bigrê,..duwemîn; bila miha Gûlanê pêşdarî bibe,..sêwemîn; ji binî civînê de cih û şun negre. Ev rûdan karlêkirî û hilma xwe dide derdorên borçîwazîya Tirk jî. Kesên du dîtina ji xwere rast digrin, dixwazin pêşdarî bibin, hêlwestên din li benda civîna Gûlanê rawestandin pêşneyar dikin, lew şun girtina li civînê bixusar dibînin.

Ev pirsgirekên li Awrûpa hêzan mijul dikin, rojenî li Tirkîyê jî tên hurkolanîn. Têdayîya rewşe û çi çêkirin tê xwestin, ji hêla gel berçavî tê pirskirin. Bimaf herkes "vergerîna demokrasî" û li benda wê mayîn bê têda diderivêne, rastîyên rojgeran bi hemû tazîtîyên xwe diyarin, lewma avakarên 12ê Êlûnê hemû qedemên sazumanê bin destê xwe de digrin, herwaha bin vê rewşe hêj peyva "demokrasî" pêşewar kirin, gir û hêrsa gel mezintir dike. Eşkere ye ku, gelên Tirkiye û Kurdistanê, hêzên demokratîk û şoreşger bi maf ev lome dikin. Û hêzên demokratîk li Awrûpa ji ev xurttir dikin. Di demeke mafên mirovan yên bingehîn tên perçiqandin, dadîngahan de her roj bi sedan demokrat û şoreşger tên kuştin, mafên karkeran tên mijandin de, behsa "demokrasîyê" kirin, tenê dikare taliyên bizdehîn derxêne û rewşekî xaponek e.

Mîna ji bo hêzên demokratîk û şoreşger yên Tirkîye û Kurdistanê, bona hêzên demokratîk yên Awrûpa jî, behsa û berhevdana, ger parlamentarên Tirk dicivînê de bên derivandin, an ne, ger parlamento wana nasbike an ne, nikarê bibe bûyera bingehîn. Lew, berî hertiştî, dilxwestina demokrasîyê li Tirkîye; di 12ê Êlûnê bi derbekî leşkerî jordest bûye û 6ê Mijdarê de hisabên xwe veşartinê bi hilbijartinan kirê û hêj leyistok misoger dikê dîktatoriya faşista devbixwîn, tenê bi xwestina tekoşîna wana hilweşandin bicîh dikare bê. Ev zorhewce ye ku bê derivandin û piştgirtin. Ger ji demokrasîyê, bi cilên sivîl yên serxwe de kirine, hovberî û vebiriyê didomîne, sazûmaneke leşkerî neyî têgihîştin, ger derivandina mafên çîna karkera û girsên xebatkar bê birdozîn û ger îroj bin hovberîyê de yê mafên gelê Kurdistan bixwazîn bên parastin, tiştê bê kirin eve ku; an piştgirtina van gelên li hemberê cuntaya faşist bo demokrasî, serxwebûn û tekoşîna wan bo mafên mirovatî divê bê derivandin, an jî divê xwedî şirîkî gunahbarên sazûmana devbixwîn, ji serî de derivandin bê dîtin. Vê barê de derketî pêşçavan, tercîh û bijartinek wûsa bêaxaf hewce ye.

Li Tirkîye tevgera şoreşger û demokratîk, Kurdistanê tevgera rizgarîya netewî bilî her babet êrîşan nekarîye bê hilweşandin. Bilî bi her ûştî talan û mijandinê aloziya kapîtalîzma yekdest kûrtir bûye, hemberê pêşketinên dijwar di heremê de burjuwaziya Tirk tengasîyê de ye û dubendîya nav çînên burjuwa çuqas diçe behtir serav dikeve. Ev rewş dirêjahîya aloziya emperîalîstên USA û Awrûpî ye, ne rewşeke ger mirov bêje mirov hember demokrasî be an ne. Balam bi tekoşîna dinavbera monopolan, dixwazin sazûmana burjuwa, çêtir bê gotin. Dewleta mêtingera Tirk, bi jingarî dirêj kin, atiya wê biparêzin. Ango ev dubendî taliyên nikarin bên serrastkirinin. Dorhêlên

*(Dûmahik di rûpelê 38an de ye)*

# George Habbaş:

## *"Ketina Arafat, Ne Hilweşandina Şoreşa Filistîn e!"*

*"Piştî serekê komîta birêvebirê PLO, Yasser Arafat, mêjûya 24.12.83an de serî li Qahîre da, pêşajoyê PLFP (Enîya Rizgarîya Gelê Filistîn) George Habbaş civînek li pêşîya weşîn û rojnaman sazî kir. Di vê civînê de, ev serdan bi rengê; 'ev ger hilweşandina tevgera şoreşa Filistîn ramangar dike' daxûyan kir. Û Yasser Arafat bi navê 'Sedat ê Filistîn" da navdan. Diyar kir ku, ji vê kêlîyê pêde, Arafat nikarê berpirsîyarîya PLO û gelê Filistîn bike. Bang li hemû hêzên Filstîn kir, daku li hemberê pêkanînên Arafat tewrê xwe eşkere bikin û berxwedanê bilind bikin.*

*Ev tewrê Habbaş, îro hilweşandina planên emperîalîst û paşverû yên li Rojhelata Navîn, armanc dike; bi bawerîya ev tewra wî, bo pêşketin û bûyerên talî di qada Kurdistan de bo xebatên tevgera şoreşger, wê çirûskên ronahîyê bide, dixwazin birek ji nivîsta civîna wî a pêşîya rojnaman kirî, mîna xwe berçavê alema giştî ya şoreşger û welatperwer, pêşkêş bikin, lew ev ji me re jî amadekarîkî hewce ye.*

* * *



*George HABBAŞ*

**Heval George Habbaş, di civîna pêşîya rojname û weşanan de:**

Sekreterê gelemperîya PLFP heval George Habbaş, mêjûya 24.12.1983an roja şemîyê, di qarargaha kovara El-Hedef li pêşîya rojnamen û muxabirên ajansan yên li Şamê, ku hêjmareka bilind li vir bû, civînek pêkanî.

**George HABBAŞ-** Ji roja şoreşa Filistîn derketî ta niha, ji xwe re azînekî berxwedana nûjen pêk anîye, daku dubendîya nav sîyonîzm û Ereban de bo mafên gelê me û netewa me bên bikaranîn. Dijminên gelê Filistîn dixebitin, daku berxwedanê hilweşênin. Bona vê yekê pir babet plan pêşve birin û dibin.

Emperîalîzm, sîyonîzm û dorên paşverû, serê 18 salane dixwazin şoreşa me, a ku kesbûna gelê me û yekîtîya wê afirandîye, qels û bêhîm bikin. Her weha êrîşên leşkerî û rêzanî birêve birine. Lê, hemû mijûlî û xebatên wan bi fîasko dawî pêhat. Balam şoreşa me, bi hindakirên giran û kovanan, êş û xwînê ser rêya xwe de, berdewam kir. Ev rewş di dîrokên şoreşan de, kêm bê dîtinê.

Sîyonîzm û sazûmana USA, daku PLO têkçûn bikin (ji holê rakin), hemû çekên xwe mîna yên leşkerî, rêzanî û weşanî serrêve xistin û wana bi hovîtîkî mezin bikaranîn.

Lê berxwedana leheng û keleş a gelên Filistîn û Libnanê û şervanên wan yên hogir û dilsoz, ev êrîşên hovberî pûçkirin. Şanî kirin ku stratejîya şoreşê (stratejîya şerê gelî), li hember zexma teknolojik a dijmin, raste û bilî vê rêyê, tu hilbijartinek din bo rizgarîyê tune ye. Ev rastî bi tekoşînên xwe îspat kirin.

Lê mixabin, derdorên birên emperîalîst û sîyonist, bi hevalbendîya û bihevrexebatdarîya paşverûtîya Ereban, yek kêlî şerê xwe a bêmaf narawestandin. Dema taxa leşkerî de binkeftin girtin, êrîşên xwe yên rêzanî herweha domandin. Pişt vegirtina Beyrûdê, Amerîka bo atîya erdên zeftbûyî, xebatek ajot, daku hevpeyvîn bi paşverûkên Ereban re bikaribe bike, xwest wana bikşîne hevpeyvînê. Sazûmana USA, bawer dikir ku, PLO pir bêkeys ketîye û nikarê li hemberê planên wan derkeve. Ji ber vê dîtina şaş û bêbingeh, nederivand ku PLO, berpirsîyar û nûnerê gelê Filistîne û plana Reagan pêşneyarê van hêzan kir.

Berî civîna 16. a Meclîsa Netewa Filistîn -CNF-, pir îşaret hebûn ku sereketîya birêvebirê PLO, amade ye bo vê planê rûnê ser masê. Bilî me ev didît, bona em bikaribin yekîtîya rêxistinê û xeta netewî biparêzin, me

xwe bi serpehetîyên demokratîk girêda. Û me xwest di sînorên dadî yên rêxistinê de, tekoşînê bajon. Ev bijartineke rast bû. Di civînên 16. yên CNF de, piştî berhevdanên westayîn û pêwîst, me karî bernameke (program) kêmasî a netewî derxênin. Ev bona bingehkirina atîya xeta rêzanî a rêxistinê û yekîtiya wê pir tiştekî baş û biha bû.

Dema nav refên Fetih de tengasî, alozî û nexweşî pêşçav bûn, me xwest yekîtîyê biparêzin. Bêlez û biaram, me xwest van nexweşîyên ser rikna yekîtî û pêşketinê helbikin. Her babet xebatên behra me bûn, me bicih anîn. Em li hemberê çek bidestgirtinê derketin. Lew me dizanî ger çek bên bikaranîn wê şoreş bêhîm, bêkeys bikeve, wê ji bîrdozên xwe dûr bikeve û perçebûn û belavbûnê bidamezrîne.

Taku bingeha welatperwerî hebe û xwe bajo, bawerîki me a dijwar heye ku, em dikarin dubendîyên nav refên şoreşa Filistîn, bi azînên demokratîk ji holê rakin. Zagona zanistî a ku dubendîyên nav refên şoreşê de dadingeh û pirsewar dike, zagona yekbûnî û dubendîyê ye.

dabû. Yasser Arafat bi vê hevpeyvînê, eşkere kir ku şêwra derivandina plana USA a xwesiparî û nokerî dixwe de barkirîye, dide.

Ev gav, berdana xeta netewî a bi tehlûke bû. Bi vê: Yasser Arafat, bêberpirsîyarîya xwe bo mafên gelê Filistîn dîyar dikir. (Mafên gelê Filistîn; ser erdên xwe yên netewî, çarenûsa xwe bixwe bibjêre, sazûmana xwe a serbixwe sazî bike hwd.)

Ev gav, bi rewşekî eşkere û zelal li dijî bîryarên CNF û gelê Filistîn hat avêtin. Ev ûşt, Yasser Arafat, danî hemberê gelê me ê şoreşger û wî ji binaka netewî, ser rêkî şaş, dûr xist. Lewma, vêca em Yasser Arafat serekê PLO û birêvebirê komîta wê, naderivênin. Em nema dikarin wî serok bibînin. Bona parastina xeta netewî a rêxistinê, bona parastina yekîtî û refên netewî, emê Yasser Arafat bi azînên demokratîk ji sereketîyê dûr bikin. Îro, dîyarkirina van mercên xwar, ez pêwîst dibînim;

1- Zehmetî û alozî çuqas tekoşîna me balifîne, bila be, bawerîya me bo doza me a dadî û mafên me yên dadî, nikarê bê hejandin.



Bes ev rewş, bi taybetîya xwe ji gavên Arafat ku avêtiye, dûr digre.

Hevpeyvîna nav Yasser Arafat û karbidestên Camp-David di sêrata Kubbe de çêbû, têdayîya nêzîkbûneke rêzanîya bi tehlûke ye. Lew, gelê me pir salên dirêj li hemberê vê rabûbû. Bedelê wê bixwîn û ronakrewanan

2- Bona berdewamkirina tekoşîna çekdarî, emê tevgera xwe a hişk, bawerî û bîrdoza xwe a bi hîm bidomînin.

3- Yekîtîya refên Filistîn, li hemberê dijmin û planên wan, çeka pêwisttirîne. Daku bingeha netewî de yekîtî bê parastin, emê bi hemû kîryar û berpirsîyarîya xwe,

bixebitin.

4- Baweriya me, û dîtina me a hişk ser bingeha welatperweriya rast bo yekîtiya netewî, xwe palandi ye. Ev tewra me, birayên me yên nav refên Fetih de; an dibe şaşîyê, an ji, ji ber doza me a dadî leqayî her babet êrîşan dibe, rêzên xwe li hemberi van êrîşan zexm dikin. Em giring dibînin ku, bangeke wusa ji bo van birayên me hewce ye.

**PÎRS-** *Hûn Arafat îro çawa dibînin?*

**George HABBAŞ-** Mîna dîtina zagonî, Yasser Arafat hêj serekê Birêvebirê Komîta PLO ye. Lê, ji vê kêlîyê pêde, nikare berpirsiyariya daxwazên gelê me bike. Nikare ramanên gelê me bibe serî. Ez bawer nakim, ku ji vir û pêde serekê Birêvebirê Komîtê bimîne. Arafat, li pêş çavên gelê me Sedat ê Filistînê ye. Baweriki me hişk pê heye ku, tewrê gelê me li hemberê Sedat damezrandibû, wê hemberê Arafat ji bidamize. Arafat bi dîtina gelê me sembolek bû. Lew ewî daxwazên gel berpirsîyar dikir. Gava pişt li daxwazên netewî a Filistîn bizîvrêne, gelê Filistîn û gelê Ereb ji wê pişta xwe li wî bizîvrinin.



*George HABBAŞ*

**PÎRS-** *Ger Arafat bê dûrxistin, wê kî xebatên rêxistinê bajo?*

**George HABBAŞ-** Pirsgirêka wûsa bo rêxistinê, wê pirsgirêkeke kin-dem be. Nuha, divê endamên birêvebirê komîtên cihî di vê pirsê de gavên xwe bavêjin, bona xebatên rêxistinê nav xwe de dan û sitandinê bikin. Bilî vê serekek dî me heye, yê ku ne ji hêla Birêvebirê Komîtê, lê ji hêla CNF hatiye hilbijartin. Bona halkirina pirsgirêkê, dagirtina valayiki wusa, divê serekê CNF Halit Fahhum dest bi xebatê bike. Lê bili hemûwan, divê em van kêmasiyên zagonî ji kêmasiyên xebatên şoreşgerî dûrbikin, ji hev cûda bibinin. Ez dizanim ku, ji hêla kêmasiyên û aloziyên zagonî û hin pergalên din de, pirsgirêk gelekin, bi vê re ez nikarim tişteki din bêjim.

Lê, bo domandina şoreşê tu pirsgirêk tunene. Çekên me, wên tim û tim li hemberê emperializmê û siyonîzmê agir bigrin. Bi taybetî, di vê pêvajoyê de, li gel tekoşîna rêzanî û xebatên girsên gel, di vê di şerê me de, tekoşîna çekdarî ji, li hemberê emperializmê, zêdetir bibe.

**PÎRS-** *Ger piştgirt û muxalifbehtir bin û xwe bizîvrênin Camp-David, wê gavê, Yasser Arafat wê bikaribe bi dadî nûneriya Filistîn bike?*

**George HABBAŞ-** Berî her tiştî ez dixwazim bêjim ku, ev pirs, pirseke gellek nazik û tenike. Ger bê barbal kirin ku emê li hemberê vê xebatê serpê rabin, bersîv ev e: gelê me bo parastina doza xwe wê rabe ser pîyan. Lew gelê me bi dirêjahîya 18 salan hewqas kovan û xusar ne ji bo ku şoreşa me bi bingeha Camp-David dawî bibe, da. Ne ji, bona vê yekê şoreşgerî kir. Hûn dizanin, talikirina şoreşê ser bingeha Camp-David tê kîjan têdayî yê? Ango, ne jibo şoreşa Filistîn, ne ji bo mafê gelê Filistîn, daku vegerê welatê xwe û çarenûsa xwe bi destê xwe bibijêre ye!

Ger em pêşbendi rewşeki wusa bibin, emê "çeka gel" bizavînin. Emê, gel bo domandina şoreşê, zana û hişyar bikin. Ez nikarim bawer bikim ku, gelê me wê li hemberê Sedatê Filistîn bêdeng bimîne û bi hemû hêza xwe li hember wî şernake.

Nenêrin gotinên Feriç û Şavva, heval! Em tewrê gelê xwe yê li erdê zeftbûyî de baş dizanin. Dijminê siyonist, daku doza netewî a gelê me bike ser rêyên şaş pir xebat kir. Yekitiyên Gundan, hînkerên eşkerene (Yekîtiya Gundan: Bona planên otonomî bên bikaranîn, Îsraîl bi destê Filistînîyên noker û sîxur du rengên rêxistinan avakirin. Ev rêxistinên hana, divêt bû, bibin alternatîfên PLO).

Hatina Arafat wê ji hatina serekê "Yekîtiya Gundan" Mustafa Dudin ne çêtir be. (Mustafa Dudin: Serekê "Yekitiyên Gundan" yên ku Îsraîl sazkiribû, bû. Dema ewî ev karê xwe dimeşand. Filistîniya pêşî wî teşhîr kirin, dawî sala 1981an de kuştin. Ev bixwe bihevrexebatdar û nokereki Îsraîl bû.)

Ev pirsa te, ji min re dibê sedem daku ez bang li her jin, her mêr, zarok û ciwanên Filistîn bikim. Daku tewrên xwe li hemberê gavên tehlûke diyar bikin. Her sendîqe û yekîtî, her welatperwer û kesê Filistîn giringe li hemberê vê rewşê, tewrê xwe berûpêş bike. Kin bê gotin, divê herkes bersîva vê pirsê bide: "Tu hevalê Sedat ê Filistînî, an tu dixwazê şoreş bê domandin?"

Gelê me wê herkesî, li hemberê van gavên bi tehlûke, bi tewrê xwe berdadingeh bike.

Tu kes nikare bêje, ev gav, gaveki hesane, an xwerû ye. Em ji demek wûsa derbes dibin: "Hebûn an nehebûn!". Pir eşkere ye ku, bo em hebûna xwe biparêzin, emê bi her hîm, hêz û sextên xwe bixebitin.

**PÎRS-** *Piştî Arafat ji Trîpolî hat derxistin, îmkanên destê wî de çibûn? Kuderê ve diçe?*

**George HABBAŞ-** Ez bawerim, gora dîtina teorîk, destê wî de pir babet bijartin hebûn. Camp-David ne çara yekemîn bû. Hînker; dikarî rast biçe Tûnis. Li vir, dikarî bangek bo birêvebirê komîtê re bike, daku dan û sitandin ser şirûtên rojgeran yên şoreşa Filistîn bikarbên. Di rewşeki wusa de, em bi navê PLFP biçuwan civînê. Bo serkeftinê, bi hemû hîma xwe, emê bixebitiyan. Meyê

piştgirtîya Arafat, ne ji bona kesbûna wî, lê ji bona serekê birêvebirê komîtê ye, bikira. Bijartina welatperwer ev bû, lê Arafat ji xwe re "bijartinek" din derivand.

**PİRS-** *Tewrê we li ser alîkarîya Misrê û Urdunê bo Arafat çîye? Em dixwazin bînin biran, ku Sûrî wî (Arafat) teydî nake?*

**George HABBAŞ-** Ez bawerim bersîv pir zelale. Husnî Mubarek û Mîr Huseyîn alîkarî didin Arafat. Li hember vê rabûna Sûrî pir xwerûst te. Sûrî ji ber xeta xwe a rêzanî, pêwîste li hember vê şêwê derkeve. Misir û Urdun piştgirtîya Arafat dikin. Ji ber ku dixwazin, Arafat plana Reagan biderivîne. Sûrî li hemberê gaveke rêzanîya wusa ye. USA, enîya Ereb (PLO û Urdun) bona vê yekê berkar dike. Hazirîkî wusa bo Îsraîl hiştîya paş. Ger enîya Erep bê refê, wê li benda guhurandina sazûmana Îsraîl bisekne. Hînker: mina Partîya Karkerên Îsraîl bêne karbidestîyê.

Lê, ez tim û tim vê pirsê ji xwe re dikim: çima Arafat ji dawîya serekên Ereban yên berî nuha têgihiştinî nagre! Lew, ger Amerîka bi planê xwe nekaribe biçe serî, eşkere ye ku wê bêje; "kusûrê nemînin, Îsraîl naderivîne, em nikarin behtir sixte ser wan bênin".

**PİRS-** *Hûn bawer dikin ku, hêj rêya tevgera leşkerî bo Filistîniyan heye?*

**George HABBAŞ-** Erê, ger hûn bi pirsa xwe, bê alîkarîya enîkî Ereban bo şoreşa Filistîn, tenê bi bingeha şoreşa Filistîn, destpêkirina bizav û livbazên rizgarîyê, armanc dikin, divê ez bêjim; ev pir zehmete.

Ger hûn pirsa tekoşîna leşkerî dikin, vê gavê tiştê ez bêjim eve; şervanên Filistîn, divê li Filistîn û Libnanê bi komên piçûk xwe sazî bikin. Bi van koma derb li hêzên Israîl bidin. Nexasim, ev tişt nuha hê jî dibe.

Tekoşîna çekdarî a Filistîn, li gel bindestîya mafên netewî yên Filistîn, wê bidome û bilind bibe. Ketina Arafat ne hilweşandina şoreşa Filistîne. Tekoşîn û berxwedana çekdarî a Filistîn wê seranser bijî.

**PİRS-** *Serdana Arafat li Qahire ji we re bû surprîz? Hûnê çawa, li hemberê vê serdanê rabin?*

**George HABBAŞ-** Bi taybetî berî şoreş Beyrût valakir, me pir analîz ser "rasta" Filistîn kir. Analîz eşkere şanî didan ku "rast" hêdî hêdî ber bi Amerîka ve diçe. Demên berî nihan de, rasta Filistîn lihevdan û hevpeyvîn behtir ser bingehên kongrên navnetewan, ku USA û yekîtîya Sovyet jî amade bûn, diderivand. Lê piştî valakirina Beyrûtê, hat dîtin ku rastbirast bi USA re danûsitandin dike. Me ev karûbar pir zelal dît. Ji ber vê yekê rewşa jîn dike, bo PLFP nebû surprîz. Lê ger hûn vê pirsê ji min dikin; we bîrdikir ku ev ji rê derketin, wê meha 12an de pêk bê? Ez dixwazim bêjim; Na!

Emê çava li hemberê ji vê rê derketinê rabin? Ez dixwazim vê pirsê wusa bersîv bikin; Berî hertiştî hêzên Filistîn, divên li ser vê gavê bawerîyên xwe eşkere bikin. Têdayîya vî gavî çîye? Hînker; em dikarin bêjin, ev gav berdewama Camp-David e, an jî Yasser Arafat dixwaze şoreşa Filistîn bikşêne Camp-David; mafê me heye em vê yekê bêjin? Ger wusa be, divê em ser tiştên bikaribin bihevre bikin, lihevdanek çak bikin. Me bi navê PLFP, bendên pirsê yên yekemîn û duwemîn bersîv da. Ev gav talîya dûrkirina Arafat ji PLO daxûyan dike. Lew Arafat, vêca nûnerîya xeta rêzanî a PLO nake.

Tiştên ji vir û pêde bên bersîv dan ev in; çi bikin? Çawa emê bighîjine vir? Gora bawerîya me, divê şer bi Yasser Arafat re, bê sînor kirin. Lew Navenda Komîta Fetih jî, dîyar kir ku, berpirsiyarê vê serdanê tenê Arafat e. Em naxwazin şer pêş bikeve, em bi Fetih re bihevre ne. Şerê me bi kesbûna Arafat û kesên wî, bi gavên wî avêtinê qebûl dikiran re ye.

Di navça Filistîn de, divê berî her tiştî, ser vê xetê lihevdanek pêk bê. Ji vir û pêde, ser vê dîtinê, bi me re yekîtî leva dikên, sendîqa hêz û kom divên xwe lihevbicivênin. Pêşî divê Yasser Arafat ji sereketîya rêxistinê bê dûrxistin, dawî divê enîkî fireh bê sazkirin, lew dema vê karê hatîye.

Dema şerê Beyrûtê em bihevre bûn, min dît ku Arafat jî li ser –nav me serekên Filistînê de, girêdanên tekoşînê yên rast hene. Lê, ji doza netewî ez tu caran bidestî nadim. Gava ji rê derketin hebe, ezê hemû him û hêza xwe birêbixim. Ger, em baş bizanibin, emê çawa gelê Filistîn bajon, emê bikaribin van ji rê derketinan jî bêkeys bikin. Navenda Komîta Fetih, gavên Arafat nederivand. Ev rewş şanî me dide ku, ev bawerîya me pir raste.

**PİRS-** *Me berî çend kêlîkan, sehkir ku we dîtinek bi Haddam re (wezîrê derveyî yê Sûrî) pêkanî. Dikarin derheqê vê hevpeyvînê me ronî bikin, ser çê hûn peyivîn?*

**George HABBAŞ-** Me ser sê pirsgirêkan danûsitandin kir.

1- Emperîalîzm êrîşî Sûrî, şoreşa Filistîn û tevgera welatperwer a Libnanê dike. Me, bo dij êrîşan, bo lihember rabûnê, bawerîyên xwe dîyar kir. Bona şirûtên bingeh û alîkarîya li hemberhev sekinîn.

2- Pirsgirêka Filistîn bû; em bawerin divê ittîfaqa me bi Sûrî re zexm be. Ji ber vê yekê bona pirsgirêka Filistîn û rêya helkirina wê, danûsitandin pêwîst e.

3- Ser hebûna me li Sûrî bû; bona vê yekê pir pirsgirêkên pratîk yên ku timdorî bên hûrkolandin û danûsitandin hene.

★ ★ ★

# QONAXA DAWÎYA XWESİPARÎYÊ !

ROJHELATA NAVÎN di van salên dawî de dû vegirtinên mezin, jingar kir. Heziran 1982an de sîyonistên Îsrail êrişî Libnanê, Gulan 1983an de cunta faşîsta Tirk êrişî Kurdistana Başûr kirin. Îsraila siyonist, bi alikariya emperyalizma USA û bi piştgirtî paşverûkatîya xweyîcih ev vegirtin pêşve xist. Dixwest, tevgera berxwedana Filistîn û sereketîya wê PLO li Libnanê tune bike. Û pêre girêdayî, hêzên din yên şoreşger ku li vir cîh girtibûn, biperçiqêne; û Libnan biqulibêne cîhekî serxwe bo emperialîzmê, daku ji vir sext li ser bike û bidestxistinê pêkbêne Sûrî ji hêla emperialîzma USA plan bûyî, bi şirikatî û hevrexebatdarîya Seddam û Evren hatî ajotî, bi destê cunta faşîsta Tirk pêk hatî tevgera êrişa ser Kurdistana Başûr, xwede armanca hilweşandina Tevgera Rizgarîya Netewa Kurdistan a bilind dibe û hêza pêşenga wê PKK, hildigirt, daku sazûmana Seddam a alozî û tengasîyê de ye xilas bikin û navçê de bi bingeha weşandina tevgera şoreşger, jina paşverûtîya xweyîcîh dirêjtir bikin. Vegirtina tevgera yekemîn ji armancên dixwest hin gav pêşve bir, lê ya duwemîn bi fîyasqo dawî pêhat.

Ev tevgerên vergirtinan li heremê dubendî, beramberî û şerên heyîn, behtir dijwar kirin, hilmên xwe nav refên tevgerên rizgarîyên netewî de peyda kirin. Ger zelaltir bê gotin, ev tevgerên vegirtinan di heremên pêk hatin de, ji pêşî de jîn dikirên hin hêz û xetên rêzanî eşkeretir kirin, dubendî û şerên di nav wan de heyîn gelek dijwartir pêşçav bûn, ji bona wan bingehên taybetî derketin ronahîyê. Pêwîst, pêşketinên dawî nav refa tevgera rizgarîya netewa Filistîn, ji bo wê rewşê re, mînaka daxûyane.

Piştî PLO, Libnan berda, ev dubendî, çuqas biçe dijwartir bû û qulibî şereke çekdar. Bi derxistina Yaser Arafat ji Tripolî giha taxekî pêşewar. Têdayîya vê tevgera bixwin, ku ji hêla alema giştî jî, ji nêzik dihat şopîn û nav refên koma mezintirîn ya PLO, nav refên El Fetih derketî, çibû? Ev tekoşîn, gelo tenê nav refê yek rêxistinê ji ber bawerîya dîtina dû biran, dubendikî bê bingeh dianî zman? An jî, ev lihevdan ji bo pakkirina pergal û pirsgirêka netewa Filistîn, dû bawerîyên ji hevdûr bûn; dubendîyên lihev nayîn bûn, an jî talîyên van dubendîyan bûn? Bona mirov bikaribe, bersîvên rast bo van pirsan bide, giringe mirov serek bide dîrokê, taybetî ser bide, piştî ku PLO Beyrût berda, nav refên vê rêxistinê, daku mirov çêtir bikaribe çav li pêşketin û bûyeran bigerîne. Ev hewce ye.

Dawîya dorvegirtina 75 roj domkirî de, Beyrût berdayê PLO, 14 Sebat 1983an civîneke xwe a pêwîst ku hefteki dom kir, pêkanî. Bi vê dixwest, tewra tevgera Filistîn a ji vir û pêde pêşkêş bike û hatin û atîya tevgerê dîyar bike. Civîn bin sereketîya Civîna Netewa Filistîn (CNF) pêkhat. Hêzên emperialist, siyonist û paşverûkên xweyîcih dest bi propoxendên mina; **"Berxwedana Filistîn û PLO belav bûn", "PLO carek dîn nikare xwe lihevbicivêne"** kirin. Nexasim civîna CNF'de, nav dû biran tekoşîneke çetin xwe daxûyan kir. Ji ber êrişên Îsrail ser Libnanê û derbên li PLO hatin xistin bizdehî û tirsa giran girtê û wan bo "rastîya" xwe şanî kirê, birê reformîstê xwesipar; berî nuha ser tevgera netewa Filistîn bikaranî dihat xwestin, planê Reagan, bi dijwarî parast, û Konfederasyona Urdun-Filistîn bo helkirina pirsgirêkê, pêşewar kir. Eşkere ye, Konfederasyona Urdun-Filistîn komplok ji rê ye ku, şoreşa Filistîn dawî bibe û nav lepên hêzên emperialist de, bibe leyîstokwarek. Bilî her azînê û serdayînên birên reformîstên xwesipar û alikarîya paşverûkatîya Ereban bo wan re, hêzên berxwedanê muxalefeteke dijwar birêvebirin û talî de, ev pêşneyar hat redkirin. Bîryara domkirina şerê çekdarî bo Filistîneke serbixwe hat dayîn. Ev şêwir talîya vegirtina Libnanê bo PLO, gavekî hatî avêtina pir pêwist dihat derivandin. Nemaza, bilî ev bîryar derketibû pêş, USA û paşverûkatîya Ereban, dev ji planên xwe ser tunekirin û xwe bidestxistina tevgera rizgarîya Filistîn, bernedan. Bi destê bikaranîkarên xwe nav refên PLO, dixwestin pêşketina şoreşa Filistîn ser bingehê şerê çekdarî bo Filistîneke serbixwe bidin rawestandin. Şûna vê rêzanîyê, girêdanên dîplomatîk pêşneyar dikiran. Lewma ev hêzên noker, destpêkirin ku, nav refên PLO de bibin muxalefeteke serhişk. Berpirsîyarê birên xwesipar, bona vê yekê dest bi axafên bi sazûmanên paşverûkên heremê kir, ango dîtinên diplomatîk birêxist. Birên berxwedanê, dest bi çareyên zexmkirina şoreşa Filistîn ser bingehên himdar kirin. Serde jî, xwe kirin nav xebateke berûçav, daku yekîtîya PLO bê parastin. Bona vê ser rikên enîya rêzanî êrişek ser xwesiparan destpêkandin. Di vê navberê de tewrên berpirsîyarên herdû hêzan berûpêştir bû, şerê dubendîya nav wan de behtir xwe germ û kûr kir. Ev rewş nedikarê bê rawestin, lew hewce bû.

Ev pêşketinên nav refên tevgera rizgarîya netewa Filistîn afirîn, ne nedihatin bendrawestandin. Pir zelal berçave ku rûdan û bûyerên zabûn, ji taybetîyên çîna berpirsîyarîya û rêberîya tevgerê û jiber ev çîn, li hemberê êrişên emperializmê ket nava tengasîyan, dîyar bûn. Lew kanîya bêçaretîya vê sereketîyê xwe daxûyan kirin. Dîrokê û rojên me de, bi gelemperî li Rojhelata Navîn, taybetî nav refên tevgera rizgarîya netewa Filistîn, wûsa an hola tewrek leyîstê burjuvazîya-piçûk, dema êrişên emperializmê zêde dibin, dikeve nav alozî tengasî, kêmasî û bêçaretiyan de. Herweha ev çîn xwe de seranser xwesiparî hildigre, bila mirov şaş neke. Rewşên wûsa de ev çîn, xwe behtir û eşkere, çibûna xwe re berçavî, zanadar dike. Berî ev bûyer nav refên PLO derketibûn û gihiştibûn vê taxê, me ser tevgera burjuvazîya-piçûk, rewş û serhatina wê, evên jêrîn nivîstibû: **"heta 1980an li hember êrişên Îsraîl pêşajotîya berxwedanê dikê hêz, reformîste û bi taybetîya şoreşgerî hêzeke burjuvazîya piçûk e, ku muxalefetîyê dajo. Mirov yarmetîya burjuvazîya piçûk a xwesipar û ta dawî nikarê berxwedan bajo berçav bêne, dema emperîalîzm dest bi êrişên xwe bike, wê meyla xwesiparî bilez pêşbikeve û**

dawîya vêde wê binkeftin û derbên giran pêkbên. Bona mirov vê ji niha de bibine, ne girînge mirov sêrbaz be." (Rojhelata Navîn ber enîşka şereke heremîye? Rûpel 29). Mîna me hemûwan ji nêzik şopand, pêşketin seranser mîna baweriya me derket û gotinên me serrast kir.

Hêzên emperialist yên ku bi navê "hêzên aşitî" li Libnanê cîhbûne, ji alîkî êrîşên xwe dijî hêzên pêşveçûyî-şoreşger yên Libnan û Filistîne, û dijî sazûmana Sûrî zêde dikin, ji alîyê din meyla reformîst a burjûvaziya-piçûk nav rêzên PLO, gavên xwe yên ser rêya îxanet û bêbextîyê lezîn dike. Li hemberê van bûyeran meyla berxedanê nav rêzên Tevgera Netewa Filistîn jî tewra xwe zelaltir dike. Ji hêlêkî di nav komên berpirsiyarên birên xwesipar, avayikî singê xwe de berxwedanê dozê dike, dipijiqe, ji hêla din: di nav refên PLO ji duh û îro berxwedan dihilmandên koman, li hemberê xwesipariyê bi taybetî ser bingeha rêzanî tewreke eşkere dahildan dikin. Kin bê gotin, nav refên tevgera netewa Filistîn dû hêlwest eşkere bûne. Dubendîyên nav wanan dijwar bûne, sînor xwe zelel daxûyan kirine û talîya wan da, lihevxistinên çekdarî afirîne. Balam di nav refên PLO çuqas diçe sînorên xwe eşkere dikên, birên berxwedanê û xwesipariyê, tekoşînên xwe bi girêdanên xwe yên derveyî û îttîfaqên xwe re, bihevre, bi azinanî didin. Hêza xwesipar, girêdana xwe bi emperializmê, paşverûkatîya xweyicih û taybetî bi monarşîyên Ereban re zexm dike. Bi alikarîya ji vanan digre, dixwaze xwe ser tevgera netewa Filistîn serdest ke; hêza berxwedanê ji, bi sîstema sosyalîst, hêzên şoreşger û pêşveçûyî yên heremê re, nav alikarî û piştgirtinê ye; dixwaze vê serdestîya xwesiparan bişkêne. Ji xwe, ev tekoşîna nav refên PLO de bilind bû, birek ji dirêjahîya şerê navbera hêzên emperialist û hêzên sosyalîst ku di heremê de bo serdestîyê dajon, ne, yên ku xwe nav tevgera netewa Filistîn xwe şanî dide ye. Pêvajoya rojgeranî xopanê de, çuqas şerê dinavberê herdû enîyan xwe bilezîne, hewqas jî di nav refên tevgerên rizgarîyên netewî yên heremê de, şer wê derkevin û têgihiştî bibin. Herweha gora çewta vî rewşî, çuqas heremê de, navbera hêzên nav tevgerên netewî birên xwesipar û berxwedanê xwe ji hev cuda bikin, hewqas ji ser Rojhelata Navîn tekoşînê dimeşênin navberê hêzên emperialist û sosyalist, wê dubendî xwe dijwartir bike. Dikare bê gotin, gelemperî nav tevgerên rizgarîyên netewî yên heremê, taybetî nav refên tevgera netewa Filistîn, ev bûyerên talî, nikarin bisinorê xwe yên teng de bên berdestkirin, û mirov nikarê ramanên van pêşketinan û rûdanan tenê bi şerên çekdarî girêbide, tişteki wûsa pir şaşe. Ev daxûyaniyên talî di nav refên tevgera netewa Filistîn, û heremê, pêwîst bi vegirtina Libnanê derketên pêşketinên rêzanî, girêdana xwe a rast, di nav refên PLO yên birên berxwedan û xwesipariyê yên ku têkilî û hevbendiyên wan yên derveyî sazine heye. Ev şerên bi rewşekî xwinrijandin hatin ajotin, ne sedemin, Taliyên derketinên û daxûyaniyên gelemperî ne. Bi vegirtina Libnanê ji alîyê Îsrail, emperyalizm û paşverûkatîya xweyicih rabû serpê. Ji hêlekê xwest tevgera netewa Filistîn qir bike, ji hêla din xwest hêzên heyîn û hêj serpêne, bidest bênin. Tiştê çêkirin dihat xwestin, ev bû ku, tekoşîna netewa Filistîn a ku bi zora leşkerî dawî pê nedihat, di plana rêzanî dawî pêbinin. Lewra emperializm û paşverûkatîya xweyicih her babet alikarî bo hêzên xwesiparî diparastin, pêşkêş kirin. Her babet alikariyên warî û giyanî dan wan. Xwedî li xwesiparan derketin. Ev hêzên xwedî li berpirsîyarên birên xwesipar derdikevin, ji kesbûna wan a eşkere, mirov dikare baş bibîne, çi leyistokên malkambax û bizdehîn tên berûpêş kirin, çi dixwazin bi PLO bikin.



*Herdû destebirak gihiştin hev... (Arafat û Qral Huseyîn)*

Hemû hêzên paşverû yên cihanê û sazûmanên heremê yên monarşîst û faşist, dema ajotîya şer, eşkere hêza xwesipar re alikarî pêkanîn û heta ji wan dihat qêrîn kirin ku ev hêz tenê "berpirsiyarî dadî" a PLO ye. Pir hesan tê zanîn ku ev ne bêsedem e. Ev lerza û recfa hêza xwesipar û hêzên piştgirtên wê yên derveyîn, daxûyan dikir ku, berxwedan di nav refên tekoşîna rizgariya Filistîn de, çuqas diçe zexm û bilind dibe. Hêzên berxwedanê, dixwestin tevgera berxwedana Filistîn ser riknên rastûpak pêşbixin. Xebatên xwe bo girêdan û itifaqên derveyî dadimezrandin û pêre ji livbaz û bizavên xwe zêde dikiran. Lê, hêza xwesipar û bêbext, bilî her babet alikariyên paşverûkên heremê û cihanê, dawîya şerên çekdarî yên pir-dirêj bûyin de, ji navça Libnanê, ji ra hat qutkirin û avêtin. Piştî ji Libnanê derketin, pir zelal berçav bû ku ev hêz ji kîjan hêzên paşverû û birên dijşoreşgerî xwe xwedî dikin. Sazûmana Misrê, ku gêtîya tevgera netewa Ereban, mîna xençer di sing de be, xwe diyar kiriye, bilî ev hêz ji hêla Erebên pêşverû û birên radîqal birabirin bûye, têne me ye, berpirsiyarê xwesipariyê berî her gavê girêdan bi vê sazûmanê re pêk anî. Ji tişteki wusa netirsiya. Mîna tê biran, sazûmana Misrê, dema Enver Sedat de, ji ber lihevhatina Camp-David bi Îsraîl re, ket nav heriya bêbextiyê û ev sazûman ji hêla "Enîya Red'ê" a pêşverûyên Ereban, dijmin hat nasin û telalî kirin. Sazûmana Misrê a noker çepereke pir gewre, li pêşiya bizav pêşketinên tevgerên pêşveçûyî-şoreşger a netewa Ereba ne. Ev sazûmana Misrê a hunduri, di heremê de yek noker û lingê emperializma USA a bi hîm e. Bi sazûmana Misrê re, girêdan çakkirin, wê naskirin, bi gelemberî li dij tevgera netewa Ereban, bi taybetî li dij tekoşîna rizgariya Filistîn, sûç û gunahbariya pir mezin e.

Kaniya derketina bûyereke wusa ji dilê reformîzma burjuvaziya piçûke. Mîna me berî nuha ji got, birê xwesipar a burjuvaziya piçûk nikare li hemberê êrîşên zêde

bibin de, berxwe dide. Qonaxa dawî a ew deynê, bêbextî û ixanete. Balam ev rewş bingeha baş û zexm ji bo pêşketina Tevgera Netewa Filistîn dadimezrine. Birên xwesipar ku ta niha wusa an halo dikarin xwe veşêrin, îro tazî li berçave, û ew bixwe xwe dane dest. Pêşketinên bi bingeh, yên ji vir û pêde girêdayê gavên pîvayî yên hêzên berxwedanê ne. Hêzên berxwedanê, divên ji pratîka dîroka şoreşa Filistîn hîndarî û ceribanin bistênin. Li ser vê rastê rêxistinên xwe sazî bikin, û stratejîya şerê gel bi babeteke rast bilind bikin. Bona vî şerî, divên girêdan û ittîfaqên bingehî, demdirêj û bê alozî bi derve û hundurî bikarbênin. Dema mirov ji navça Libnanê qise dike, di serî de hêzên netewî yên berxwedana Filistîn, hêzên pêşverû û radîqal yên alema Ereban, divên li hemberê êrişên çekdarî û yên din, yên emperializmê rolên xwe û tevgerên xwe baş bileyizin. Ger vê bikin, û pêre gavên pêşvetir bavêjin, wê bikaribin dijwarîya xwe biparêzin û wbikaribin ta sînorekê pîvayî jî be, emperîalîzmê rawestênin.

Li Rojhelata Navîn, heremek din, ku têde dîtinên berxwedan û xwesipariyê bi tekoşînên xwe şerek bêaman dajon, Kurdistanê. Îro Kurdistan ji heremê ji nêzik dihilmînin. Ji ber vê yekê, pêşketinên baş an nebaş nav refên Tevgera Rizgarîya Kurdistan, qulibandina statuqoya heremê bo xusarên emperîalizmê, endamekî pir pêwîst e. Ji ber zanîna vê rastîyê, di serî de emperîalizm, hêzên paşverûkên xopanê, ji dîroka derbasbûyî vir de, xwe dihelifênin, daku li navça Kurdistanê hêza berxwedanê neafirîne, bi hezaran qomplo birêdixin. Ji hêlekê vegirtinên seravêtinên leşkerî, rêzanî û aborî têgihiştî û berûpêş dikin, dakû bikaribin Kurdistan bikin mêtingeha xwe a serpê, navçên berxwedanê bidin erdê, ji hêla din talîya wan de xwesiparî serdest bikin. Tim bi vana dijmin pir qonaxên hewce bidestê xwe aniye jî. Balam îro, bi taybetî li Kurdistana Bakûra-Rojava bin pêşenga PKK hatîgihiştî û bingeh bûyî tevgera berxwedanê û hilma vê tevgerê ser beşên din yên Kurdistanê û ser hêzên netewî li van bêşan emperialîzm ditirsêne. Emperyalîzm û paşverûkên heremê bi zor û sextê birê, dixin bikartênin pêre, nav refên TRNK (Tevgera Rizgarîya Netewa Kurdistan) xwesipariyê xwedî dikin û dixwazin vêna serdest bikin. Lewma di nav refên Tevgera Netewa Kurdistan, bi taybetî demên talî de pêkhatina pêşketinan pir bal kişanddar in.

Meha Gulan 1983an de, tevgera vegirtina ser Kurdistana-Başûr demeke wûsa de birêket ku hêzên Kurd yên vê beşê li hemberhev şerê çekdarî dimeşandin: şerên hundurî bilind bibûn û pêre ji wê gavê berpirsîyarê xeta berxwedanê PKK, merhelê de hilma xwe ser hêzên netewî li van bêşan pêkdianî. Di rewşeke wûsa de, pêkanîna vê êrişa vegirtinê, nikare ji xwe bê derivandin, ango ji peyva dem û mêjûya hatî hilbijartî nabe lihevrasthatinek bê qîm kirin. Emperîalîzm, paşverûkatîya heremê û diktatorîyên Seddam-Evren, ev êriş pêkanîn, daku tevgera ji ber lihevxistinên heyîn li vir bêkeys ketibûn tunebike. Ji hêla din dixwestin tahlûka mezin bo hatina wan, TRNK û di nav refên wê hêza berxwedanê biperçiqênin. Bi derbên giran bêhîm bikin û li hember xeta berxwedanê, daxwaza himkirina xeta xwesipariyê dilê xwede vedişartin. Ji ber ku ger nav refên Tevgera Netewa Kurd de birên berxwedanê xwe serdest bikin, wê dîktator, emperialîzm û paşverûkên xweyîcih leqayî potensîyeleke pir mezin a şoreşger bibin û vêna baş jî dinasin.

Gulan 1983an de li Kurdistana Başûr pêkhatî tevgera vegirtinê bi fiasko dawî pêhat. Derbe girtina xeta berxwedanê li alîkî, ger nav refên Tevgera Netewa Kurd ger ji nav refên hêzên pêşveçûyî û şoreşgerên heremê behtir bihîm bû. Liser vê, emperialîzm û paşverûtîya xweyîcih, dixwazin neha xeta xwesiparî serdest bikin û bona vê yekê xebatên xwe dilezînin. Gelemperî gişa ya Kurdistan de, taybetî li her kêrîyê, jîn dikên hêzên xwesiparên burjuvên-piçûk re, hin hêzên tarî alîkarî didin, wan dikşênin nav bawerîyên paşverû. Burjuva-piçûk a xwesipar a Kurdistana Başûra-Rojava bi pêwîstî xwe li ser sosyal-demokrasîya Awrûpa, dihilmêne. Ji hêlekê êrişên xwe li hemberê xeta berxwedanê zêdetir dikin, ji hêladî, pêre pêre "Kurdistaneke otonom" dixwazin pêk bênin, kîjan her birdoz ser vê daxwazê rûreş û bextreşe. Mîna vê li Kurdistana Başûr jî, birek ji burjuvazîya-pîçûk a xwesipar bi paşverûtîya heremê û bi taybetî dîktatorîya Seddam re hatî girêdayî, di nav karên dijwar bo "Kurdistanek otonom" dixebitin. Xwiya ye, ev pêşketinên hana, bi gelemperî nav refên TRNK de, bi taybetî li her beşên Kurdistanê zexmbûn û dijwarbûna xeta berxwedanê têne zman. Ji alîyê din şanî dike ku dijmin û neyar nav tirs û xofa dijwar dene. Hêzên neyar, hêzên xwesipar dikşênin nav livbazên wûsa, dakû bibin çeperek li pêşîya xêza berxwedanê, bikaribin serdestîya xeta berxwedanê ser tevgera şoreşa Kurdistan biseknênin. Balam ev, şanî me dide ku nav refên TRNK de, hêzên berxwedanê timdorî pêşdikevin, hîm distênin û hatigihiştî dibin. Daxûyane mîna li hemû tevgerên rizgarîyên netewî, TRNK de jî pêşketin, bi bingeha dubendî û şerên van herdû xetan wê sadir bibe, û giringe bibe jî. Berxwedan û xwesiparî bihevre bi şer û tekoşîna dij-hev pêşdikevin û xwe bingeh dikin, daku bilez xwe serkeftin bikin. A talî tayîn bike, eve ku kîjan hêz amadekarîya xwe çêtir bi plan û gavên pîvandî avêtibe ye. Lê, em dixwazin vêna salox bidin; îro gelemperî li Kurdistanê, taybetî Kurdistana Bakûra-Rojava şert û şirûtên, ûşt û rewşên hundurî û derveyî bo pêşxistina berxwedanê hatigihiştinê. Tevgera berxwedanê, bi gavên pîvandî bên avêtin, bi girêdanî û itîfaqên, ango hevalbendiyên sazibike de, paşî talîyan bikaribe ji xwe re biafirîne, ser vê riknê, dikare hêlwesta xwesiparî pir hêsan pişange (teşhîr) û birabirîn (tecrît) bike. Nemaze, taxa em têde ne, bi kîjan rûçikî xwesiparî xwe sipartibe, bira be, xwe dide dest, nikare xwe ji vê rewşê rizgar bike. Ta rojên em têde ne, xwesiparî, ger li heremê, ger ji li Kurdistanê bilî afetên giran û malkambax neafirandîye. Îro reformîstî û xwesiparî ji hêla gelan pir baş tê nasîn. Servê jî, îro gelê Kurdistan bi tewra xwe îspat dike ku, hevalbendê berxwedan û hêza berxwedanê ye.

Kin gotina talî; emperialîzma USA, bi destê paşverûkatîya heremê, li hemberê gelên Rojhelata Navîn êrişên bi plan û pêşewar, yên ku zêde dibin, pêk têne. Bi vê re girêdayî di nav refên tevgerên rizgarîyên netewan yên heremê de hêzên berxwedan û xwesipariyê, li dij-hev tekoşîn dijwartir dikin. Emperialîzma, bi piştirgtin û alîkarîya paşverûkatîya heremê, dixwazê ji hêlekê tekoşînên gelan bi xwînrijandin bifetsîne, ji hêla din, di nav refên tevgerên netewî, heremê de, xeta berxwedanî a ku nikarê bixeniqêne, li hemberê dîtina berxwedanê, dîtina xwesiparî derdixêne pêş, alîkarî dide wan û wan xwedî

*(Dûmahik di rûpelê 38an de ye)*

Nama Partîzanekî

# ŞERÊ NAVBERA ÎRAN Û İRAQ Û TEWRA TİRKÎYÊ


*Şerê şevgera didome...*

ÊLÛN 1980an de, bi êrîşa Îraqê ya ser Îranê ev şer destpêkir û ji ber mafên çînên karbidestên herdû welatan û emperializmê –sînora pêkanîna daxwazên wan de ma– û heyanî rojên em têde, didome. Ev şer, hilma mafên çînên karbidestên herdû welatan û berdewama polîtîka emperializmê a heremê ye.

Emperializm, dema aloziya xwe a sêwemîn de, Rojhelata Navîn de, li hin babet cihên şer de, hin hêz li hember hev germkiriye û şer xwe daxûyanî kirine; ev şerê hana jî rast bi rast keda vê rêzanîyê ye.

Ji va navçên şer yek jî, şerê navbera Îran û Îraqê ye, ku behtirî sê salane didome. Ev şer ji hêla burjuvazîya Îraqê hat destpêkirin, ji ber ku 1975an pêde yekdestî kemilîbû û çîn xwe ji hev cuda dikiran, daku daxwazên emperializmê li Îran û delava Basra yê bicîh bên. Lê talîyên derketin, ev daxwaz bicîh neanî û di vê gavêde hêza şer derxistibû, kete nav alozeke bêçarewar.

Ev şerê bi zixtkirina emperializmê ji hêla paşverûtîya Îraqê destpêkiribû, di xwede pir alî armanc vedişêre. Ev rastî, şerê gelek dirêjbû de xwe eşkere dîyartir kir. Em dikarin van armancan kurt wûsa binivîsin;

1 - 1975an Îran, alîkarî bo tekoşîna Kurdistana Başûr dikir. Bona ev alîkarî bê birîn, Îraq birek ji erdê xwe dabû Iranê. Bi vî şerê, Îraq dixwest ev erd carekî din ji Îranê bistêne.

2- Ev erd delava Basrayê dizîvirîne. Îraq dixwest, bi rêya vê erdê, serdestîya xwe ser delavê (korfez) hîm bike.

3- Îraq dixwest, karbidestîya Îranê ku hêj xwe bingeh nekiribû, nav şereka wûsa bikşêne û melisî bike, dakû piştgirtên şah yên paşverû herweha sazûman bikin bin destê xwe.

4- Îraq dixwest, bala alema giştî hundur û derve bikşêne ser vê şerê, daku dijberîya şoreşgera demokratîk a Îraq û dijberîya Kurdistan a netewî, hêsantir bên perçiqandin û têkçûn.

Mîna tê têgihiştin, şer vanan hemûyan berçav dikir û ji ber mafên şirikî yên burjuvazîya Îraqê û emperializmê destpêkir.

Sazûmana Îraqê Êlûn 1980an de yekderbê êrîşî Xuzîstanê kir. Li vir kanîyên petrolê yên pêwîst hene. Bi vê teqtîqa yekderp êrîşê, Îraq karî ji ber hîma xwe a teknîk, serkeftin bidest bêne. Di serî de Îraq, bajarên Abadan, Huremşehr, Ahwaz û Dezful zeftkir. Bi vê diramand, serdestîya Îranê li ser delava Basrayê bişkêne û kanîyên petrolê yên stratejîk bidest bêne. Pêre ji aborîya Îranê dahilweşîne. Ev navçe xeta bingeha êrîşê bû. Xeta duwemîn a êrîşê, navça ji mîhran ta Qesr a Şêrîn bû. Ev xeta duwemîn teqtîqî bû, dihat xwestin, ger êrîşekê Îranê li ser bajarê Bexdadê pêk bibe, bête rawestandin. Navça bingeh a êrîşê, xeta ji Dezful ta delava Basrayê bû.

Îraq serdestîya xwe di şer de, ji ber îmkanên teknîk, nêzîkî salek û nîv domand. Piştre Îran bi sê êrîşên bingehîn, destpêka 1982an ta nîvê salê, hêzên Îraqê ji erdê xwe derxist û gihîşte taxa serbiserî. Talî Îran însiatîf kire dest xwe, û demekî pir kin de, dest bi êrîşên dijwar kir. Îran şer domand. Sedemên bingehîn yên çima Îran êrîşên xwe di vê xetê de, pêkdianî evbûn; li vir gelê şîî dijî. Îran dixwest alîkarîya wanan bistêne û girêdana Îraqê bi dêlava Basrayê bibre. Ser delavê qontrola xwe pêk bêne û bajarên bi navûdengê şîîyan, mîna Necef û Kerbela Bidest bixe.

Lê ev plan, ji ber navçe avûherî bû,

çekên teknîkî kêmbûn û teqtîqên zana çap nebûn, negihîşte ramanê. Bilî şereke dijwar, westdar û pejirandinbar dihat meşandin, ev daxwaz pêk nehat.

Dema Îran zehmetîyên şer di vê navçê de dît, şer kişand hêj bakûrtir, navbera Mendelî û Zarbatîyê. Ev navça şer, ji sînorên Îranê yên nêzîktirên bajarên Bexdayê bû. Ji ber vê yekê, Iraq hêzên xwe yên pêwîst û girîng li vir kire kozên şer de. Xeteke parêstinê a zexm li hemberê Îranê li vir sazî kir. Îran, bi yarmendîya bilind û bawerîyê û bi gelekbûna şênîya xwe, ev şer dajot. Lê, ji ber paşvetîya teqtîqî, nekarî xeta parêstina hêzên Iraqê belav bike.

Dema Îran li vir ji talîyên raman dikir, bidest nekarî bêne, êrîşên xwe kişand hêj bakûrtir. Ango kişand ser erdên Kurdistan. Di vê navça şer a sêwemîn de, tehdîtkirina Bexdayê ne pir hesan bû. Ji ber ku ev enîşk, ji sînorên heyîn a dûrtirîn ji Bexdayê bû. Nemaze hin bîrdozên tên zanîn, yên rêzanî û leşkerî hebûn. Ji ber vana Îran êrîşên xwe kişandibû Kurdistanê. Ev armanc kin evin:

1- Dema bi êrîşên xwe li ser Iraq serneket, xwest ji pêwîstîya rêase û erdçiya Kurdistanê berjewendî (feyde) bigre û vî şerî taxa hêdî hêdî pejirandinê ne de, bidomîne.

2- Dixwest êrîşên xwe ji ser Hacî Umran berdewam bike, lew kanîyên petrolê yên dewlemend li vir hene. Bajarên petrolê yên Kurdistana Başûr mîna Mûsil û Kerkûk, ku pir bi bingehî di aborîya Iraqê de cîh digrin, zeftbike, dakû aborîya Iraqê bikeve nav rewşeke xedar.

3- Dixwest li erd û çiyayên Kurdistanê ku rê nadin de, serdestîya teknîkî a Iraqê ta sînorekî teng jî be, bê bingeh û bê kar bike.

4- Hêzeke mîna PDK-Iraq ku girînge û navçê de xweyî cîhe, bikşêne nav şer û sazûmana Iraqê ji hundur bireilêne, û tehdît bike.

5- Dixwest navça Hacî Umran bin destê xwe bike, daku girêdana hêzên Qasimlo –ku bi Saddam re pêkanîbû–, bi Bexdayê re bibre û bi pêvajoyê bizav û livbazên li Kurdistana Rojhelat bi dijwarî zêde bike.

6- Li Hacî Umranê Kurdên Soranî xweyicihin. Hêzên Telebanî li vir xwe rêxistin kirine. Îran dixwest hêzên PDK-Iraq û Telebanî li hemberhev bo şerekê zixt bike, daku herdû hêz jî bên melisandin û bê hîm bikevim. Bi vê rêyê dijberîya netewî a Kurdistana Başûr, bike nav bêçaretîyên kûr.

Sedemên girîng yên ji ber çê şer kişandin Kurdistanê, bi bingehî evên jorîn bûn.

Şerê ji hêla Iraqê destpêkiribû, Iraq anî enîşka hilweşandinê. Û li hember vê, Îran ev şer ji xwere derence bikartêne, dakû sazûmana xwe hundurî ê çêtir serdest û xwedî bingeh bike. Iraq nekarî ev şer ji xwere, bo têkçûna dijberîya hundurî, bike hacet û birê bixe. Di vê niqtê de tu serkeftin bicîh nehat. Aloz û weşa aborî û civakî a ku tê jîngar, dijberên civakî hêj hîm û zexmtir kirîye.

Sazûmana Îranê, ku navça şer de insîatîf dest xwe de girtîye, pir çareyên girîng li vê navçê de, pêkanî. Karî bala alema giştî bikşêne şer û hêzên xwe rêxistî kiribûn yên girîng, mîna Mucahîdên Gel, TUDEH û Fedaîyên Gel, ji bin bêhîm û bêkeys kir. Ev talîyên bo dijberîya Îranê derketin, sedemên wan berî her tiştî, xeletî û kêmasîya van hêza ne. Lê sazûman baş zanî, wê çawa ji xeletî û kêmasîya van hêzan berjewendî bikşêne. Îran ev şer, bo perçiqandina dijberîyê, bi rewşa derencekî, bo xwe pêkanî.

Îro, Îran ev şer di taxa pejrandinê de digre. Ji hêlekê êrîşên xwe li hemberê Iraqê taxa teqtîq de digre, ji hêla dî li benda zexmbûna hêza Hizbil Dawa ku ji dijberîya Iraqê û şîî ne, dimine, wana re alîkarî sadir dike. Hizbil Dawa, bir rewşa xwe a rojgeran, bo sazûman bidest bixe, bê teknîk û bêhîme.

Şer behtirî sê salane dom dike. Nîv milyon mirov ta niha hatin kuştin. Nêzîkî milyonek mirov birîndar ketin. Û sazûmana Îran baş, ji vê şerê, bo doza xwe talîyan derdixe. Îran talibûna şer naxwaze. Ger şer dawî bibe, wê Îran li hemberê dijberîya hundurî re, rû bi rû bê. Ev rewş, wê jêre pir zehmetîyên girîng, ji şerê hemberê Iraqê damezrîne.

Sazûmana Iraq ku bi zixtkirina emperîalîzmê êrîşî Îran kir, dawî kete rewşa xwe parêstinê û giha enîşka hilweşandinê. Aborî bi taxekî bilind pejirîye û nikare vêca şer xwedî bike. Artêşê (ordî) wê ji alîyê moral ve pir ketîye, û hatîye ber rewşa weşandinê. Dijberî nehat perçiqandin, û behtir hêlwestî zexm bû. ji ber girêdana paşverû, Iraq navnetewan pêşîya alema giştîya cîhanê ji birabirîn (teşhîr) bûye. Sazûmana faşîsta Tirk, behtir ji hewce, têkilîya xwe bi vî şerî re pêk tîne. Benda pêsketinan amade ye.



(Dûmahik di rûpelê 33an de ye)

# DÎROKA GELÊ ME Bİ BİNGEH, KANÎYA ÇANDA WÊ DEWLEMEND E

Birayê hêja, bi vê namê niviseka nûh pêşkêşi we dikim. Mina tê zanin derheq gelê Kurda de mina rûreşê Lord Curzon kesê bêhim dibên ku "ev gel bê dirok e. Û bê wêje ye". Zevftkarê burjuvayê Tirk mina dara jiyanê dest davên van gotina û xwe bi van gotina digrin. Gelê me, ji hev sar û dûr dikin. Û mina Tirkên çiya didin nîşandan û hêllên gel li ser vê yekê dixapinin.

Mina wun ji pê dizanin ji rabûna netewan re hebûna çand û dirokê şertên çareninin. Yekitiya dirok û çand û zman, netewbûna gel bikar tinin. Em li dewletsaziya Yunanistan mêzekin. Ev welat beri mîlladî hebûn domandiye û bi İskender ta Hindistan'ê giraniya xwe nişan daye. Lê, piştî vê demê ketiye zevfta Romaya, Bizans û Osmaniya. 2000 salan zêdetir jêrdest ma ye. Û di nav vê demê de dewletsazi pêk neani ye. Dirok û çanda Yunaniya kevn, bi destpêkirina tevgera Ronesansê derketiye meydanê û bi rêberiya şaîrê İngiliz LORD BYRON li welatên biyane xebatên fireh destpê dikin pê de gelê Yunan hişyar dibi û bellê piştî 2000 salan şûnde sala 1825 digihijin azadiya xwe. Mina xûyane, hebûnê çand û dirokê di tevgera rizgariyê de cihên pêwist digrin, ji bo vê yekê: ev nimûneki ye.

Ku ji min û we ra ji vaji tê, nimûna İsraila faşist li pêş me radiweste. Beri 3 hezar salan, dema Îsa peyxember da hebûnek siyasi domandine şûnda dewletsaziya wana rabûye û hilweşiyane. Li hêllên cihanê bela bûne, pişt pêkanina Hitler ji, disa wan çand û hebûnên xwe yê diroki derxistine. Pêşî nav xwe de hevkari pêkanine. Û dawiyê, sinema, tiyatro, wêje û sin'etê bedew mina destikan bikar anine û bi zaneyi dirok û çanda xwe bere-bere bi cihanê dane hebandin û bi alikariya emperyalistan dewletsaziyê pêkanine. Ev bûyer çiqas vaji be, lê disan ji nimûneki ye.

Ji ber van yekan li hember ew ên ku dibên "**gelê Kurd bê wêje ye û diroka wê tune ye**" em ê çima xwedi li dirok û çanda xwe dernên. Ku em xwedi dernekevin ew ê ki lê xwedi derkeve? Ma qey em li benda derketina şairêkê İngiliz rawestin; ta wê gavê em ê bê deng bin? Helbet bersivan van pirsan "na" yeka qirase ye.

Îro li Tirkîyê, hêzên zevtkar ji girtin û kuştina birayên me û ji pêkaninên işkencê natirsin! Ji bidarvexistina birayên me natirsin! Ji qirkirina girtixanan natirsin! Lê, a tirs dide dilê wan; tevgera gelê Kurd, hînbûn û zanîna çandi û diroka Kurd e.

Hêzên zevtkar û faşist dikarin bi hemû rengên zerp û işkencê pêkaninên nemirovi li ser birayên me pêk binin. Lê, vê zerp û işkencê li dirok û çanda gel nikarin bikin. Çima!? Lewra goşt û hestiyên çand û dirokê tune ye. Ji sedemê vê yekê tirs dikeve dilê wan û har dibin.

Ku hoyên demê dijwartirin û gellek xebatên tevgerê nayên pêkaninê, wê gavê ev dibe rêyeka çarenin: derkirina rûreşi û nemiroviya faşizmê, pêkanina hizkirin û hevkari û yekitiya girseyên Kurd, gelê xwe li ser çand û diroka Kurdan ronahi bikin û fêr bikin. Ji sedemê, me qîma xwe li gellek tunebûnan ani ye, pişta xwe daye dijwariyan di nav vê rewşê de em ê vi şerê birûmet bi dominin û ev ji me ra rêyeka çarenine. Wê gavê em çima kêrê li çiyên xedar naxin?

Di derhola vê berpirsiyariyê de min vê nivisê, nivisandiye û pêşkêşi we dikim. Helbet wê ev nivis ji yên ku dibêjin "**Kurd bê dirok û bê wêje ne**" bibe bersiveki. Ji xeynê van yekan, xebatên ser çand û diroka Kurdan vejinandinên vi ali ew ê neeriniya nav tevgerên Kurdan rabike.

Mina tê zanin kemalistan bi berdevkiya Afet İnan diparêzin ku: koka Eti û Summeran Tirk e. (Ku tu eserên wê nehatine wergerandin û qala helezonê lê çê nebûye) Ji bo ku Atatirk koka Tirka bigihine Anadol'ê, li ser vê bide zanin gellek xebatan kiri ye. Navdanina kit ê Sumerbank û Etibank ji vê yekê ye.

Ta sala 1980 ji bo Kurdê KASSÎT û GUTÎ'yan pejrandin çênebûbûn. Lê, rojnama "cumhûriyetê" di çend nivisên xwe de sala 1980yi KASSÎTA ji digihande koka Tirka. Li gohra wana ku Kurd "Tirkê çiya ne" wê gavên KASSÎT û GUTÎ ji dibi ku koka wan Tirk be. Ku em xwedi lê dernên tevgerên pejrandinê nasin û naqedin. Destavêtina me ronakbir û kedkarên Kurdan ew ê vê tevgera pejrandinê rawestine.

Dirokniviskarên biyane, hebûna gelê Kurdan digihînin Vegera Dehhezaran. Yani digihinin beri miladi salên 500i. Lê, ku li kitabên van niviskaran bê mêzekirin kevniya nivisa wan eşkere xûyan dibe. Ku gelê Kurd û imparatoriya Hitit hemdemin ta sala 1907an derheq imparatoriya Hititan di tişt nedihate zaninê. Dema ewili kolona Hiti'i di vê dirokê de destpê bû. Nivisên û nexşên li ser danezanan hatine ditinê ancax sala 1917an de xwendina wan pêkhat. Van danezanên bê emsal diroka Kurdan ji ronahikirin û derxistin ber rojê. Ji sedemê van yekan nivisa pêşkêş dikim pêkaninên arkeolojiyê niveka diduyê sedsala bistan dide berxwe.

Niha ji di radyoya Tirki de "**ditina eseran**" tê weşandin. Lê yên kijan netewan e daxûyan nakin; diniximinin. Ma gelo ji bo çi? Van danezanên diroki ji ber ew wê zanisti pêşbixin û bibine hêzek ji rizgariya netewi re. Dema van rastiya derbikevin meydanê, ew ê efsana "**Tirkê çiya**" ji bipelişe. Lohmanê daxûyan nakin.

## DÎ DÎROKÊ DE CÎYÊ GELÊ KURD

HEBÛNA GUTÎ ya digihîje qurna salên kevin. Hetta niha qralê GÛTÎ'yan yê ewili Emnatûn ê (Annatom). Beri miladi salê 3100an de ji ye. Yani 5082 sal beri me. Piştî vê dirokê gellek serdarên ku hatine, diroka beri xwe ya gelê Kurd anine zman.

## ÎMPARATORÎYA GÛTÎ-KURD

DEMA BERÎ MÎLLADÎ serdarê Lagaş ADADNARÎ, di 2400î de ser-

darê UR "OUR" KMÎLSÎN ji gelê KARDA, axa Kurdan, serdarê HÎT-TÎT SEUBÎLKUBUE (Souppilou-lioum 1.) jî di salê B.M. 1370 de ji hêla KARDAKA û ji civatên KURTÎE, û KURTÎan bahs dikin.

Mîna TUGULTÎ ÎNOR serdarê Asûr ji GUTÎyan re "KURTÎ" di-gota. Dîsa serdarê Asûra ku di sala B.M. 19. de jiyaye; ADALNÎRARÎ jî, bi refên siwarîyên ceşên KUSÎ, û GUTÎ yan re şerr kiriye.

Ev serdar di danezanên xwe da ji GUTÎyan re "KURTÎ" dibêje.

Ev bi danezanan aşkere ye ku; dewletên KHALDÎ, ARARATÎ, SUBARÎ, NAYRÎ, MÎTANÎ, MÛŞKÎ û dewletên KASSÎT (KÛSÎ)yan ji GÛTÎyan tên, reha wan digihije GUTÎyan. Ku derheqê vê de danezanên berbiçav hene.

Ev danezan ji SALMANASAR 1î maye. Ku salmanasar 1 B.M. 1280-1261î de li welatê ASÛR ser-darî kirîye. Anî piştî serdarên GÛTÎ EMNATÛM tam 1829 sal paşiyê li welatê xwe serdarî pêkanîye.

Di vê danezana serdarê ASÛR de ev yek tên gotin: *«gelê Gûtî mîna stêrkek şewq vedida. Û ew ne tenê bi piranîya xwe, bi ezm, zerp û dij-warîyên xwe jî dihatin zanîn. Dij-berîya wana li hemberî min jî do-mîya.»*

Bi vî awayî jî; piştî hilweşandina serdarîya Gûtîyan hezar salî, serdarê ASÛR SALMANASARê 1., şaxên dewleta GÛTÎya, û yên ku gihîştine dewya wî "ZARÛYÊN GÛTÎ" dibîne û sedsal di navê de derbas bûyibe jî, ew dîsa "GÛTÎYAN" tîne zman.

Disa ev serdar piştî cengên xwe van yekan dinivisîne.

*«...ji tixûbê ARARAT heta pût'ên TÛRÊ di nav vî welatî de xwina GÛTÎ heriki...»* Li van derên gotinê nuha jî gelê Kurd dijî.

Di dîrokê de cara yekemîn welatê Babîl; GÛTÎyan têxistîye destê xwe. Lê, serkarîya Gûtî, hilweşîya. Welew serkarîya Gûtî hilweşîyabe jî, ji dew-letên Kurda, şaxa serkarîya Gûtîyan bi serdarîya Kurd-Kassîta (Kûsî) de-ma geşî bi dewleta ta 725a li Babîlê domandine. Ala Kurdîtî ji dewletên Kurdan; SUBARÎ, MÎTTANÎ, KHALDÎ, MÛŞKÎ, NAYRÎ ta giha-ye împaratorîya Med'a.

Bi danezanan zelale û tu şik jê nayê ku Gûtî pêşiyên Kurda ne. Dîrokzanê û nivîskarên li ser dîroka Asya û Mezrabota dixebitin vê ras-tîyê bi gellek danezanan tînine zman. Profesorê Unîversîta Pensîlvanya SPEIZER di pirtûka xwe **"Koka Mezrabota"** da daxûyan dike ku Kurd û Gûtî û Hûrûbî yên Zaxros'ê ji kokenê ne. (B. Nîkîtîn: cîld 1 R.91.)

Dîsa dîroknivîsarên Osmanîya AHMED REFÎK dipirtûka xwe **"Tarixî Ûmûmî"** de, EMÎN ZEKÎ, di **"Dîroka Kurd"**de bi gellek kifş-kirinan vê yekê didine nişandanê. Ji van yekan pêştir dîrokzanê binav MJCERSON pêşkêş dike ku; piştî serkarîya NAYRÎYAN (ku ji Gûtîya ne) ew jî bi "KURTÎ" navdar bûne. Dîsa Dr.KONTÎNON vê yekê kifş dike ku; B.M. 4 hezar salla de civatên ZAXROS û li Mezrabota bi cîh bûne; bi Gûtî û Kusî (Kassît) navdar bûne. Û bi eslê xwe jî Arî ne. Civata Kurdên îro ji van hatîye. (Mijûy ebedî. Kurdî-cild 2.)

Di pirtûka (Dîroka Kurd û Kur-distan) de nivîsîye ku Gûtî û Karda pêşiyên Kurda ne. Rojhelatzane Dr. Rays jî xwedîyê vê dîtinê ye. (Îhsan Nûrî:R.173.)

Hebûn û kevnarîya dîroka Kurda; rast-birast ne be jî, karbidestên Tirkan jî ray lê tînin. Ji bo vê du danezanên pêwist di destê me de hene. Ji vana yek; "ÎSLAM ANSÎKLOPEDÎSÎ" ye. Di rûpelê wê yê 1089an de ev nivîsandine: *«... Berî milladî bi 2000an li ser kevirên SUMMERa, navê welatê KAR-DA-KA hatîye nexşandinê. Ev welat li başûra gola Wanê, li cem gelê SÛ dima. (Revue D'assyriologie-Thureau Dangin)*

Danezana duduya pêwîste. Lew-ra di dema angaştina ronakbirên Kurda de, li dadigehê hatîye zman.

Bi vî awayî ji eşkere dibe B.M. sala 1071 de ji Melezgirtê derî Ana-dolê bûne; di nav-bera Tirk û Kurdan de ji al netewî û pêşiyan ve têkilî nîne.

Sawcîyê dadgeha leşkerî-Komîta-nîya Sêêrt, Dîyarbekir, Sawcî Saîd Dabak di rûniştina 23.10.1971î de hebûna Kurdan ji 6000 salî ve da-xûyan dike *"di dema SASANÎyan de xûyadibe ku qewmek bi navê 'KURTE' heye. Dema berî milladî 3000-4000î de pêşiyên URa, KURa û KURDa ji berê ve bi ARÎ û SASA-NÎyan re jiya ne. Û tu şik derheqê vê de tune ye...»*

Li ber vê ev gotina pêşiyan bê hemd tê bîra mirov; *«Rûvî berê ne-diçû qulê, Rabû; hejik jî bi terîya xwe va girê da»*

Em mana gotina "GÛTÎ" ji we-şana Hoybûn **"Civata Welatên Kur-dan"** hîndibin ku mana wê "Şervan e".

Bellê ji pêvajoya dîrokê ve qew-mek ji çîyayên bilind, ber bi SURÎyê ve bi cîh bûye. Navên wana "GÛTÎ", "CUTU" bû û şervanbûn. Ew qew-min ji berê ve li nav hêlên "SÛS" û Kafkasyayê bi cîh bûne. Li rojhelata Îran'ê, hêlên çîyayê Anadolê cîh-girtine. Demek bi dewleta ELAM û SUMMERan re şer kirine.

Ji serdarên Gûtîyan; LOSÎRAP, ŞERLEK, ÎKŞMÛŞ, ANRÎ, DAP-ZÎR û TIRÎKAN yên bi nav û pê-wîstin. Di Şehnamê de ji ŞERLEK ra SÎYAMEK, ji ÎKŞMÛŞ ra MÛ-ŞENG tê gotinê.

Em ji kîtaba Îhsan Nûrî hîndibin ku; piştî zeftgirtina welatê Babîl'ê serkarîya Gûtîyan 125 sal, 40 roj bi serdarîya 14 serdarên Gûtîyan hatîye domandinê.

B. Nîkîtîn dinivisîne ku; dawîya serdarîya SARGONa, GÛTÎyan anîye. Û ev dewlet heta B.M. 2496a serkarî domandîye.

Serdar OTON (Ku ew jî Gûtî ye) serdarê Gûtîya, TRÎKAN bindixe. Gelê Gûtî piştî vê binketinê belavbû. Di nav vê hilweşandinê de Gûtî yên Betlîsê navê KAR-DA-KA sitendin. Yên hêla çîyayê Baxtîyar û derdorên hêlê serbixwe man.

## ÎMPARATORÎYA KÛSÎ-KASSÎT

DÎ DÎROKÊ DE ji vê împaratorîyê re Cemşîd jî hatîye gotinê.

Tê zanînê ku li Rojhelatê tore ye, navên serdarên bilind li welatan dibe. Şehname; Kassît û Kûsîyan Kinaya, û ji milletê Cemşîd dihesibîne. Piştî hilweşandina serkarîya Gûtî, gelê Gûtî vê dewletê avadike. Û serkarîya wana sîyasî hetta B.M. 1896 û 1176a didome. Lê, dîroknivîskarên roava, dîroka binxistinê B.M. 1160î didine nîşandanê. (Maurice Meuleau, Le Monde Antique Paris 1976, R:160)

Mîna tê zanînê împaratorîya Kas-sît û welatê Hittîtan hemdem bûn. Ku ta sedsalîya 20. derheqê Hittîtan de tu tişt nedihate zanînê. Ji xeynî çend gotinên pêşberî Îsa bûne, danezanên

derheqê Hîttîtan de zanebûna alema beşerî bi kolanên 1907an derî holê bûye. Xwendina danezanên kolandinê ancak sala 1917an pêkhat. Piştî bişkavtina Elifbaya Hittîta ne ku derheqê welatê Kassîtan bi firehî em gihîştine zanebûnê. Berî vê yekê ku dîroknivîskaran hebûna Kurdan ji "Herikandina Deh Hezaran" destpê dikirin. Ji kêmzanebûnê û taybetî ji ber dîroka Hittîta nedihate zanînê.

Di dema Kassîtan de; pêşveçûn û hemdemîya Kurda gellek kêrî hemdemîya alema beşerî hatîye. Bi sine'at, çand, wêje, destik, pût û wêneyî bi dewleta Mittanî ve tesîr li hemdemên xwe; li Hittîtan, Asûr û di dema serkarîya Fîraûnan de li Misirê kirine.

Di vê dema ku têkiliyên çandî û bezirganî pêşveçûne, di nav-bera van dewletan de, dan û sitendine, guhurandin berçav dive ku danezanên ji kevnara Misir ku li muza Paris'in gellek zangêr xwedîyê vê dîtinêne ku; perek ji vana ji danezanên Mezrabota û yên Asya pêşin.

Ji hêla dî ve, li Kurdistan'a Başûr hêla Hatna de di kolandinan de gellek danezanên bi rûmet derdkevin û li muza Bexdayê dimînin. Ev danezan di salê 1951 û 54an de, têxistine muzeyê.

Dîsa, pûta qewartinê, danezana dema dewleta Kassîta, ku gellek navdare; bi navê "Pûta pêşkêşîyê" li Paris'ê di muza Lauvrê cihki xuya û bi nîşan digre. Di vê danezanê de serdar Melîshîpak II, keça xwe pêşkêşî Mania Fanrica dike. Danezana serdarê Kassîta serdar Karaindash di B.M. XVî de daye çêkirinê, ziyareta daye oxira xu da nuha li muza Berlin'ê dimîne.

Ji xeynî dewlemendîya vî alî, mîna hemdemîyên xwe di alî sîyasî de jî; welatê Kussî bi nîşan e. Di navbera dewlet û serdarê demê de têkilî têne avakirinê, berpirsîyarên serdara li welatan hene, çun û hatinên berpirsîyarên hêla tê domandinê, serdar ji hev re nameyan dişînin hwd. Nexasim van têkilîyan di navbera welatê Fîraunan û împaratorîya Kassîtan de gellek pêşketî ye. Di nav wan de bendên aşitî û lihev-hatinê têne karanîn û ji hevre hevkarin.

Di alî bingeh avakirina dad û nav dewletê împaratorîya Kussî-Kassîta danezaneka pêwîst e. (Ji bo zanebûna firehî li Le Monde, Antique-Maurice, Meauleau, R:161î mêzeke).

Di alî karbidestîya dewletî de pergalên berkarî û berpirsîyarî sazbûye. Di hêlên zîyaretan de piştî civîn û torên olî xebatên wêje, çandî û sinet jî pêşkêş dibin. Ku xelkê Kurd vê tora xwe ta rojên me domandîye.

## ZEFTGÎRTÎNA BABÎL

PÊŞVEÇÛNA ALÎ SÎYASÎ, karbidestî, çandî û civakî de împaratorîya Kussî-Kassîta, ne pêşveçûneka lihevhatî ye. Lewra, mîna pêşiyên xwe, Kassîtan jî B.M. 1530î de Babîl'ê zeftgirtine. Hebûn û mîrata Babîl'ê ji karbidestên Kurdan re maye. Mîna tê zanînê pêşî li van welatan monarşî serdest bû. Ku di vî alî de Hammurabî, bi serdarî hebûna li hemdemîya Babîl'ê nexşandiye. Ev serdar, Asûr'a, Eshounna û serdarê Mariyan bindixe. Û di sala B.M. 1695an de tixûbên welatê xwe firehtir dike.

Ger di dema Hamf rabbî (B.M. 1729-1686) ger jî di dema selefê wî (B.M. 1686-1648)an de di nav sazûmanê de berkarî û berpirsîyarî hatibû avakirin û ev yek berbiçav xûya dibû. Karbidestîyeka bihêz hatibû avakirinê. Fermanên dewletê, serkarên hêla hwd. bi nivîsî dihatin pêşkêş kirinê. Serdarê welat, li ser fermanan bihûr4bijarî disekinin. Jiyana polîtîkî û Aborî biyekdestî dihate domandinê. Nîşana dada Hammurabî bi nav û deng e. Di dîroka mirovî de, cara yekemîn damezrandina bendên dadî bûye karê wî. Dema mirov li ser van bendan naweste eşkere xuyane ku serdarên van dera mîna bav û gellek mêzin têne hesibandinê. Hêza xwe ji hunda ra distînin. Ev bend vê taybetê zelaltir dike;

*«Bi hay û hizkirina xûdayan ez Hammurabî; dadî li welat bijînim, û ji bo neerînî û xwînrij û qisatan rabikim, ji bo keda jaran ji alî xwedîhêzan nêyî xwarinê, mîna rojê li ser gelê xwe min şewq veda. Şivanê xûdayê MARDOUK, ku wî berpirsîyarî dayê, ji bo dinyayê rohnahî bikim; min tucaran gelê bin xwe ji çavan dûrnexistîye. Bêkêr nebûme û sî ya mîna xêrxwaz li ser hemû şehîdên welat vegirt. Min mirovên welatên AKAD û SUMMERan ji daxiste himbêza xwe. Wan ji di nav aşitî de jîyand. Kamilbûyîna min wan ji parêst. Ji bo dewlemend, jaran neeciqînîn, ji bo mafên sitûxwar û sêwî û jinebîyan bikeve dest, min bibendên dadî li welat karbidestineka pak damezrand. Ji bo kifşkirina bendan min li vê derê gotinên xwe yê birûmet nivîsand. Bi serdarî, serbilindî û xwedî dadî ez wan li ber hebûna xwe pêşkêş dikim.»*

(Qanûnên Hammurabî)

Dema Kassîtan Babîl tevî welatê xwe kirin, ji xeynî pêşveçûyînîya xwe bûne xwedîyê dewlemendîya mîratê Babîl'ê jî. Lê, dema ku Hammurabî, jî welatê Gûtîyan xiste bindestê xwe, bû xwedîyê vê dewlemendîya mezin. Ev dîtin ji alî zangêrana jî têyî kifşkirin.

Ji ber kurt-nivîsê, em pêwîst nabînin ku bi firehî li ser afirandinên dewleta Kassîta rawestin. Lê, em vê kifşkirina xûyane, pêwîst dibînin ku pêşkêşî xwendevanên hêja bikin. Ku; alema beşerî, cara yekemîn di dema Gûtî û Hournîtîyan de hespê destikeka suarîyê bikar anî ye. Ev gavekî pêş e. Di alî şer, ger, çûn û hatinê de hwd. ev gavekî gellek pêwîst e. Dîsa li gor texmîna me, cara yekemîn dîsa kerpîç ji alî Kassîtan ve bikar hatîye. Îro 3500 sal derbas bûye jî, ev destik di nav gelên Asya-Pêş li hêla gurolîtî bikar tê.

Dîsa li Babîl'ê dema Kassîtan de cara yekemîn di alî destikên pîvanê, dirêjî û giranî de, Kassîtan danezanên pêwîst afirandine. Û li gor Maurice Meûleaû jî, ji bo astronomî xebat û danezanên pêwîst bi vî gelî pêkhatine (Le Monde Antique. Maurice Meuleau R:201).

Di alî hekîmîyê, kifşkirina tedawîya nexweşîna de, pêşveçûneka berbiçav di dema Kassîtan li giştkî Mezrabota pêkhatîye. Ji alî hunerên desta ve li mal û kargehan ji xwelîyê cêr, tas hwd. çêdikirin. Ji ber zêr, zîv jî B.M. sedsalîya bîsta ve ji alî Gûtî û Summeran dihate zanînê jê gellek afirandinên bi rûmet çêdikin, li hêla gundîtî gellek destikan ji dara bikardianîn û ji bo ajotina erdê dixebitandin.

Ji hêla di ji ber ku dizîn li Babîl'ê nîn bû, ji hêla Kapadokya (derdorên Newşehir û Qeyserî) dianîn. Hebûna zift û qîrê hê ji wê dema ku Mûsil û Kerkuk bindestê dewleta Mîttaniyan de bû, dihate zanînê. Lê, alema beşerî ji dema Kassîtan ve vê dewlemendîyê kêrî xwe tîne.

Ku serdarê Asûra Toukoultî vê

yekê dibêje: *«Li hafa Mitta li cem dewlemendîya Bitume min çadir vegirt. (Ku ji vê dewlemendîya binê erdê re Bitume tê gotin.) Li wê derê dengê xwûdayan di nav zinaran da dihata.»*

Ji alî Maurice Meuleau tê kifşkirin ku di jiyana civatî de bi gellek rengan ev dewlemendî hatiye xebitandinê û ji alî Kurdan ev dewlemendî ji welatên din re hatîye şandinê. Cara yekemîn bi 28 xirawî zîf, torekê difroşin, piştre toneka wî derdixin 160 xirawî zîv.

Taybeteke pêwîstîya dewleta Kassît jî ev e ku di alî sin'et û mîmarî de gellek hunermend afirandîye. Ziyaretên Babîl'ê, seraf û bexçe, bûrç û qale, xan û eywanên kêf û xweşîyê, rê û pirrên bi nav û deng hemû li ser pişt û hunerên hunermendên Kurdan avabûne. Di nav de sedsalan derbasbûyî be jî em dibînin ku ev taybet di dema Medan de jî hatîye domandinê.

Nexasim dema Meda de û piştre jî hunermendên Kurdan ku li Anadolê danezanên pêwîst avakirine, yên Pers, Roma û Yunanîyan de jî vê hunera xwe bi giranî domandine.

Me li jorê dît ku pêwîstîya hunera avakirinê li cem Kurdan çiqas pêwîste û di dema xwe da têkilîyên dewletî bi ciranên xwe ra şewq girê didin, ji bo vê yekê jî ev nameya serdarê Kassîtan serdar Kadashman ji serdarê Misir Amendphîs re rêkirîye pêwîste.

*«Ger tu birayê min bî (bi mana hevalîyê) tu çewa dinivisînî ku ez tu tişt nadim te? Dema min xwest bi qiza te ra bizewicim te ji min re got ku* **'tu car keça serdarê Misir negihaye kesekî di.'** *Çima wiha dibêjî? Tu serdarî û li gor xwe bi tevgerî. Ger tu keça xwe bidî min, ew ê kî hember biryarê te derbikeve? Bersîva te ji min re gotin. Ez ji birayê xwe ra dîsa dibêjim. Keçên tê yê kemilî û jinên delal hene. Wê gavê, yek ji van yina mina keçeka xwe ji min re bişîne. Kî dikare bêje ku ne keça serdar e?*

*Min xwestina zêr jî nivîsandibû. Zêra bi lez bişîne ji min re. Di vê dema havînê de bigihîne min. Bi vî awayî qesra van avayê min dest pêkiriye biqedînim. Ger di vê demê da tu zêra bigihînî min, wê gavê ez ê keça xwe bidme te. Tu tenê dixwazî qton zêr bidîmin, ku ez ray lê naynim. Û ez keça xwe nadme te.»*

(Nameyên El-Amarna, H: 4)

Bi nameyê kevnaya qelen jî me bi bîr anî.

## HÎLWEŞANDÎNA KASSÎTAN

WELATÊ KASSÎT dema xwe ya geş û dewlemendî di navbera B.M. sedsalîya 15 û 12an de derbas kirîye. Dewleta Mîtanî (di zmanên biyanan de Mittanî tê gotin) ji hêla şervanên serkar ve karbidestîyê di domandin. Û welatên Asûran jî ji xwe ra kirin paytext û li hêlên bakûra Îraq û Sûrîyê, li hêlên Rûha, Mareş û Mêrdîn'ê serdestîya xwe didomînin. Hittît jî li Anadolê bihêz bûn. Bi vî awayî di vê pêvajoya dîrokê de, li Babil'ê Kassît, Başûra Anadol'ê Mîtanî û li Anadol û qeraxên bahrê hêla Sûrîyê di navbera Hittîtan de demek aşitî û xuya tê jiyanê.

B.M. di salên 1380î de bi êrîşên Hittîtan û ji nûjenîya Asûran dewleta Mîtanîyan hilweşîya.

Salên dilxweşî û aşitîyê li dawîyê man. Di nav-bera Hittîta û Misirîyan de şerên dem-dirêj destpêkirin. Di van şerên demdirêj de ki serket, dawîya şer ji alî herdû hêlan ve çi afirandîye bersîva vê yekê ne hêsan e. Lê, baş tê zanîn ku, piştî hilweşandina dewleta Mîtanî, 100 salan de li Rojhelata-Nêz çar dewletên bi hêz hebûne. Asûr, Hittît, Misir û dewleta Kassîtan. Ta B.M. sedsalîya 13an di nav van dewletan de rewşeka wek-hevî pêkhatîye. Lê, piştî van salan ev çar dewlet demeka dijwar dijîn. Bi serkarîya Assour-Oubalit (B.M. 1356-1320) êrîşê welatên cîrana dikin. Êrîşên zeftkarîyê li van hêlan domandin. Ev serdar welatê Kassîtan zeftgirt û Babil'ê xiste destê xwe. Bajêr hilweşand. Û pûtê Mardask bire welatê xwe. Lê, ji al gellê xwe va ku ji serkarîyê hate hildanê û ku hate kuştinê, gelê Kurd ji vê keysê feyde sitend. Di vê rewşê de wan welatê Asûran zeft girtin. Lê, şerrên hemberîyê dewleta û welatê Kassîtan gelleki jar kir.

Dawîyê Kassîtan di B.M. sala 1171î de bi êrîşên Asûran hilweşîyan. Dawîka jiyana sîyasî bi van êrîşan pêk hat; û pelişîn. Ji ber vê rewşê dewletên Kurdan, yên nû derketin rûkê dîrokê. Dewletên Mannaî, Nayrî, Khalde, Muşkî, Ararati, Nemrûdî û dewleta Meda ta berî miladî sedsalîya pêncan hebûn û ala Kurdan domandine. Bûyera Dehaq jî B.M. 612an hember Asûr serhildana gelê Kurd û avakirina dewletîyê dide xûyandanê. Di salê B.M. 612an ji alî Kurda ve dewleta Asûr hildiweşe, û di dîrokê de ji vê demê ve hebûneka sîyasî nedaye nîşandanê. Hebûna Kurda di alî sîyasî de demeke dirêj domîya, ta bi serkarê Pers'a (B.M. 534). Sîrûs zeftgirtina Anadolê ev yek jî ji holê rabûye.

## DANEZANÊN NÎŞANA KU KASSÎT KURD'ÎN

ROJHELATZANE Ojen Pîtar daxûyan dike ku bi demê ve Gûtîyan dewletên nûh avakirine û navê Kassît (Kusî), Lolo, Mamaî, Mîtanî, Kardûş, Khaldî, Kardû, Mad (Med) sitendine.

Rojhelatzane Alman Mersfeld jî dibêje ku; *«navê behra Hazarê di zmanê Awrûpayan de Kespîn e. Bahra Hazar'ê navê xwe ji civatekê distîne. Ev civat B.M. li başûr û Rojhelata bahrê disekinîyan û navê civatê Kusî, Kasû, Kessesî ye. Gotina Kasû, gotina piranîya Kasp, Kespîn e.»*

Berpirsîyarê danezanên kevnare Anderk'ê Îranî van yekan dibêje ku; *«xwedîya danezanên li Loristanê derketine, nayê zaninê ku kingê jîyane. Lê li hêlên Hazarê derên çîyaî sekinîne. Dawîyê bi êrişên qewmên êrîşbaz bi çûna Loristanê qewmê Kassîtan bi nêzkahi xwedîyê 4 hezar sal kevna dîroki yê ne. Vê qewmê Babil'ê zeft girt û nêzî 700 salî li vê karbidesti domandine. Dawîyê dîsa vegerîyane çîya. Hespan xwedî kirin û firotine Asûran. Ji gellek destikan, bi hunerên xwe danezanên xuyare afirandine. Îro ev danezanên me ditine, ji dewlemendî û hunermendîya wan ji me ra mane.*

Dîsa dîroknivîsarê Osmanî Ahmed Refik di **"Tarîxa Umûmî"**yê de dibêje ku Kassît pêşiyên Kurdê îro ne. Di îrannane û dewra Eskarîyan de ev yek di cildê II.yan de tê kifşkirinê.

*«Berî miladî salên 1800 de, Kasûyên li Babîl'ê dewlet sazkirin û felsefe û dadî de pêşketine, Kassû an ji Kassît bêguman pêşiyên Kurda ne.»*

Welew di nav de nêzi pênc hezar sal derbas bûbe jî îro gelê Kurd li ser vê axê jîyana xwe didomîne.

B.M. bi 1500 salan de ku demekê gelê Mitanî li Rûha, Malatya, Mêr-

dîn, Mareş û li hêla Kerkukê împaratorî avakiribû, li Bakûra Îraq'ê, Kurdên Kusî-Kassîtan, li hêlên Agirî û Qers'ê, Kurdên Ararati, li Mûş'ê, Bedlîs'ê, Erzîncan'ê û hêla Wan'ê KAR-DA-KA an jî li Wan, Hekkarî, Sêêrt, Suleymaniya, û roava Îranê bi Medan tevî hev, bi hevra hebûna xwe ya netewî, wêje û sin'et û çanda xwe ta sedsalîya bîstan anîne.

Ev kifşkirina dîrokê ye ku li ser eynî axî gelê Kurd hebûna xwe hundanekirîye û derxistîye holê. Xeyn vê jî ev hêl ji destpêka dîrokê ve ji alî tu hêzî ve nehatiye zeftkirin. Welew ji demên kevnare ve ev hêl di bin gellek êrîşan de mabe, bi rêz êrîşên Persa, Grekan, Romayan û dawiyê êrîşên Ereb'an û Moxol, Selçûk û Tirkan dibe ji ji pêkanînên hovberî hwd. mîna Rojhelatzane nivîsandine gelê Kurd xwe kişandîye hêlên çîya û hebûna xwe domandîye.

Hêzên zeftkar cîhgera Kurdan mîna rêçekê ji xwe ra dîne. Mîna Alexandre (Îskender) dema diçe Hindistan'ê, Sirûs, dema Sûrîyê û Anadolê zeft digre, Romaî hember Rojhelat dema bend avadikin hwd. hertim erdê Kurdan bîranîne. Lê, ji ber şervanî û berxwedana gelê Kurd tu carî binxistin û tunekirina Kurdan pêkneanîne.

Dîsa di îd û rojên kêfxweşiyan, edet, çand, destar û destikan de, çîrok û sin'et de gellek tiştên dişuhubin taybetên Kassîtan mirov dikare liber çav bibîne.

Lewra li nav Kurdan Kassîtan xudayekê bi navê (Huza), (Hoza) heye. Îro "Huda" û "Hode" bi mana Xuda di nav Kurda de têzanîn. Li cem Kassîtan xûdayê avê EA ye. Di Kurmancî da av mana vê gotinê ye. Dîsa Kassît ji xuda ya hîvê re (sîn), (zîn) dibêjin, ku ev di wêjeya gelî de hebûna xwe domandîye û Ehmedê Xanê di Mem û Zîn de Zîn'ê dike sembol.

Di vî alî de gellek mîsal hene. Ku taybetên destana Mem û Zîn mirov bîne bîra xwe wê besbe. Ji ber kurtnivîsê li vêderê em li ser taybetên destana Mem û Zîn naseknin.

Ji dîrokê çîqas bê pêjrandin, bê guhartin jî, dinya kevnare delîlê rastîyê ye.

**Dr. Cemşîd Bender**

DAWÎ

# ŞERÊ NAVBERA ÎRAN Û ÎRAQ Û TEWRA TİRKÎYE . . .

*(Destpêk di rûpelê 27an de ye)*

Sazûmana Tirk, ji serî ta niha ev şer ji nêzîk dişopîne, dema şer xwe kişand Kurdistanê, ji wanê din behtir bizdeha û ket tayê. Borîya petrolê, ku ji Kerkûkê ser rêya Zaxo de dirêjê Yumurtalik, ger ji bo Îraqê, ger ji bo Tirkîyê, pir girînge. Îraq ser vê rêye, firotina petrola xwe pêktêne. Ji firotina derveyî a rojîn, 2/3 li ser vê rêyê pêktê. Ango rojê 600.000 varil tê firotinî derveyî welat. Tirkiye jî petrola derveyî a girîng ser vê rêye dikre. Ji ber vê yekê herdû sazûman, nikarin biderivênin ku borîya petrolê bikeve nav tehlûkan. Bilî vê serdestên Tirk, jî dîrokê virde, Mûsil û Kerkûk kanîya xwarina xwe dibînin. Dema şirûtên baş derkevin holê, wê êrîşî vir bike. Bona vê yekê di kozêde amade rawestahiye.

Îro şerê navbera herdû welatan, nêzîkê Mûsil û Kerkûkê didome. Herweha Tirkîye Îran tehdît kir û bala alema giştî kişand ser bajarên Mûsil û Kerkûkê, û ser borîya petrolê ku vê navçê de dirêjahî diherike.

Pir îşaretên ku sazûmana Tirkê faşîst alîkarî dide sazûmana Îraqê faşîst, berçav hene. Pir kes ketina firoka şer a Tirkîye di nêzîkî Zaxo li Kurdistana Başûr, îspat şanî dike. Gora bawerîya hin hêzan, ev firok hin kozên Îranê bomberdûman kir û dema ji ser erdên Îraqê vedigerîya Tirkîye, ji hêla firokên Îranê hate xistin. Piştî ketina firokê, Îraq 6 helîkopter şiyand cîhê bûyerê, daku pîlotan rizgar bike, lê ji ber firok li erdê bin kontrola PDK-Îraq ketibû, ji mecbûrî ev helîkopter jî hatin vî cîhî û pêşmergan dido ji wanan jî dan erdê.

Serê sala 1983an Tirkîye û Îran lihevdaneke aborî îmze kirbûn. Gora vê vê salê de Tirkiye wê buhaya mîlyonek dolar war bifrota Îranê. Lê nîvê salê de, Îran ev lihevdan yekalî peşkiland. Tewra xwe li hemberê Tirkîye daxûyanî kir. Ev pêşketin şanî dikin ku, Tirkîye li hemberê Îranê alîkarî dide Îraqê.

Lê belê bilî vê, sazûmana Tirkîye xwe dihelifîne daku ji şerê navbera Îran û Îraqê, bi bingehî bo pejrandinên xwe yên aborî û rêzanî, derbasbûn pêkbîne, berjewendî bidamezrîne. Pêwîst, sazûmana Tirk a nûh, vê pirsê de daxwazên xwe eşkere dîyar dike. Ji hêlekê polîtîka aborî a ser firotina derveyî welat didahilmîne, ji hêla din pêşketinên li Kurdistan, sazûmana Tirk bi dijwarî dibizdihîne. Şerê xwe kişandî vê heremê, Tirkîye ji rikni direilêne. Ji ber vê sedemê serekê sazûmana nûh Turgut Özal "bo serkeftina bêdengîya hundurî" şerê navbera Îran û Îraqê pir girîng dibîne. Bala alema giştî kişande vir û eşkere kir ku ev şer girîngtir ji şerê Libnanê, dişopîne; behtir têkilî hewce dîyar dike.

Hersê sazûman, ji kevnare virde kiryarin, Kurdistan birabirînin û tenha bihêlin. Tevgera tunekirina dijberîya netewî bihevre dimeşênin. Li ser bingehên lihevhatinên veşartî, îro welatê me qulibandine navça şerekê. Bi vê dixwazin zanistîya netewî a gelê me jar bikin, tekoşerî bifelişênin, û hebûna pêşveçûyî û şoreşger dahilweşînin.

Ev rewş şanî dike ku welatê me ketîye demeke nûjen. Ger bi zanistîya şoreşger bê nêzîkin, ev dema nûjen, ji ber şerên navberên dijminan wê bibe gavek, bo gav avêtinên pêşeyî. Lê belê ger, hêzên Kurd bibin dûvekên rêzanîyên dijmin, wê rewşekî bi tehlûke, behtir ji yên heyî, biafire. Çêtir bê gotin, wê binkeftinên giran û kovanî bidamizin.

Lewra bi va pêşketinan, îro dîrok, behtir ji her demî erkên bîrdozî derdixe pêşiya me. Bona gelê me û tekoşîna rizgarîya netewa me, ji vê demê zexm xwe derbas bike, pir xebatên girîng divê pêkbên.

Em partîzanên Kurdistan, bi zanyarî û berpirsîyarîya şoreşger, ji alîkî di nav şerê germ de, karê bicîhanîna tekoşîna xwe dikin, ji alîyê din, emê ji vir û pêde, pêşketinên girîng, bi nivîsin xwe bighîjînin gelê xwe. Û gelê xwe bi nivîsên babet babet, agahdarî pêşketinan û saloxan bikin.

# TÎYATRO -3-

*(Destpêk di hejmara derbasbûyî de ye)*

**Tegmen** – Çend salan de, li kuderê çêbû û di kîjan salî de mir?

**Apê Elî** – Wî, ev ji ku derket lawo, ev çidibê. Secera kê dipirse. Wele qomitanêmin ez pê nizanim.

**Astegmen** – Dewar kurrê dewara, ma hînê te nekirine. Gohê xwe veke. Ha hînbibe. Atatirkê mezin, sazkarê dewleta Tirk, sazkarê dewleta me ya dawîyê ye. Ew li dinyayê yeke û jê mezintir tinene. En mezin Tirk Atatirk. Hîn bibe vê. Temam, ka bêje; ka dîyarîya wiya xortan bêje.

**Apê Elî** – Êê... Hema weleh ji bilmirem.

**Astegmen** – Ha ji ter van kaxida, rakê! Heta êvarê têr vana jiber bikî. Hey! Wun, wunê heta êvarê vîna hînbikin. Ku heta êvarê hînnebe wê gavê ezê dê û xwişkên we sosret gerandî bikim. Hişt tu, ka bêje;
– Li ser nîşana cumhûrbaşqanî çi heye. Û ev çi mane didin?

**Mistefa** – Min nekiriye xem ji xwe ra. Min neditiye. Û nizanim çinin jî.

**Astegmen** – He, he... Ka, ka were bi vê va. Ha, ha, haştera hah!!! Ka îca wê bibê xem an na?! Rabe, rabe pîya îbne! Çewaye ha...?

Tabî helbet wunê nizanibin. Lawên Atatirk emin, em. Ne wunin ku zanibin. Wunê hemû vê jiber bikin. Li ser nişana cumhûrbaşqani 16 sitêrk hene. Her yek ji mana dewleteka Tirk dide nîşandanê. Temam, ew tîrêjên rojê jî sembola cumhûrîyeta Tirk ya dewleta dawiyê dide nîşandanê.

Tu hê ranebûyî ne wilo. Rab û xwîna dev û serçavê xwe paqij 'ke. Hê ezê nîşanê te bidim; ka tu bise.. hişt tu were vêderê zû, ûla pûşt.

**Xelîl** – Xelîl Ordek, Rûha, Emirke qomitanêmin.

**Astegmen** – Ji neha pêve baştir çavê xwe veke, guhên xwe mûçke, tişteki mîna serê derziyê jî ku ji çavên te, dengê bayê ji guhê te dûr bimîne... Wê gavê dema tu hatî tu zanî. Mûç be. Tişt dibin em pê nahisin. Nabihîzin.

**Xelîl** – Emirke qomitanê min.

**Astegmen** – Bazde cîyê xwe. Marş!

Hişt qerdiyan ev pûşt hê ranebûye ser xwe. Wî rakin bikişkişînin, bînin.

**Qerdîyan bi çeplê Mistefa digrin bi lêdanê ve li erdê da dikişînin û dibin.**

**Xelîl** – Hevalno, wuha nabe.. Ji ber du kesan qawîşa me diherime. Navê wê nebaş dertê. Çima ji sedemê wan emê ji lêdan û işkencê bibînin. Û lêdanê bixwin. Dibî ku di nav me da jî nîzamek hebe. Bi xwe wulo nabe. Tu kesek ji me jî vê yekê naecibîne. Nexwe ewê me temaman jî bikujin. Wê bikujin lawo! Ji sedemê kesekî, du kesa! Çima? Karbidestên me çi dibêjin, emê wilo bikin, wê yekê bicîh bînin. Emê hember wana bêdeng bin. Kî ji we ray li vê nayne. Ji bo çendeka kuştin û lêdanê dide berçavê xwe.., kî?

**Salih** – Welleh ewê Mistefa bikujin. Birina wî ne ji têrêraye. Welleh ewê wî temam bikin.

**Apê Elî** – Lawo, lawo, deka, deka êhh, hih ka ezê çikim ji vana. Evê vana bi min re çibikin lawo? Lawo wilo mekin! Ka ezê hewqasan çewa jiber bikim. Lawo qena alîyê min tê te ev çiye lawo?

**Xelîl** – Were vê, wer ha hah. Dest pêke "Ben Turkum"

**Apê Elî** – Min Turka.

**Xelîl** – Rast bêje, rast. Rast bixwîne...

– Ben Turkum.

**Apê Elî** – Bin Turkim.

**Xelîl** – Ha dibe ha, bêje, bêje!

– Doxruyum.

**Apê Elî** – Doxriyam

**Xelîl** – Ka dev ji vî zmanî berde. Ev çiye?

'Doxriyam' na! 'Doğruyum' bêje!

**Apê Elî** – Doğ-ri-yum.

**Xelîl** – Ha, ha, hişê xwe baş bide serê xwe. Baş. Haydê bêje.
–"Çalişkanim".

**Apê Elî** – "Çalişkenim, hişt çibû dîsa dinikê me, çibû ji te dinika.

**Osman** – Ha ji we re lawo, ha ji we ra bikişînin. Bikşînîn ji xwe ra. Min dev ji çixarê berda? Berda, a.. a bise telaqê min berda..

**Xelîl** – Çîye lawo, ki neşter xistîye ku wilo diciyê xwe da nasekinî. Vî seri-wî seri çiye dipîvî. Heval dixwînin, dersa xwe dibînin. Ev çiye dest û lingên te nasekinin. Wax be! Wax, wah, jina min abûkat û hakima dîye. Jêr gotine en kêm wê deh sal bixwe. Ûla wax, wax. Ew jî dibêje ezê çbikim ji te! De were li çoka xwe nede, de were. Lawo ka, ka, ka, çixarekê bidne min, ka çixarekê!

**Xelîl** – Dîsa çibû? Çibû ûlan?

**Osman** – Ûla pûşt. Li vêderê namûs ji diçe, ûla qûnê me jî vedikin, dinêrin ka tiştek heye, tuneye? Tûh ûla, ûla.

**Xelîl** – Sebir ke. Bila lêdana te hebe. Mêze em ji xwe ra

dersa xwe dixebitin.

Osman – Ma hema Xelîl qena tu neke qurban, hema tu wilo neke.

Xelîl – Ka tu jî bêje lo, haydê: "Yaşam".

Apê Elî – Lawo ev çi "yaşim"e.

Xelîl – Tu ji bese 10. Jiberke bese..

**Vê gavê qerdîyan bi hewrikên nan dikeve qawîşê.**

Berpirsîyarê Qawîşê – Dîqqet! Em li ber emrê te hazirin qomitanê min.

Qerdîyan – Ha ji we ra. Raknê, nanê îro ha tu ji rake



"moruk" bi xwee.

Apê Elî – Naxwim..!

Qerdîyan – Dawîyê tê birçî bimînî, tê...

**Dema derdikeve tegmen dikeve hundir.**

**– Dîqqat, em hazirê emrê qomitanêminin.**

Astegmen – "Moruk" were virê... wer!

Apê Elî – Hiii, qomitanêmin, hiii.

Tegmen – Ne wilo. Dema em hatin, hima pût bisekine, û tê kunya xwe bixwînî, haydê ka çê bike!

Apê Elî – "Memleket" Diyarbekir; navê min: Elî.

Tegmen – Naa, na! Ne wilo. Elîyê Diyarbekirî, ji emrê te re hazire. Temam!

Apê Elî – Înşellah.

Tegmen – Ka sonda me bêje?

Apê Elî – "Turkem, doxrîyam". Êêê "Turkum,... doxruyum!!

Tegmen – Rast bixwîne, mîna pilaqa xerabe nebêje..!

Apê Elî – "Dox-riyam"! "Tirkam"!?

Tegmen – Bêje, dawî?

Apê Elî – Qomitan. Bilmîrem. Wellah bilmîrem!!

Tegmen – Ûla moruk, Xumeynî kîye?

Apê Elî – Xumeynî...?! Xumeynî?! Rehbere qomitanê min.

Tegmen – Pûşt.. Atatirk kîye?

Apê Elî – Û xwedê bela wî bidê, bê şerefe, bê namûse!!

**Tegmen şaş û metal dimîne, çavên wî sordibin, dirêne wî lihev dikdvin, di xweydanê de dimîne.**

– Namûsiz, pûşt, pûştê kurrê puşta. Deka bise, hajtere, ha qûnde,ker kurrê kera. Çima te wilo got.

Apê Elî – Çi... çima ew... ew ji... ma ew jî qomitanêmin. Ax, oy... uff. Qey lawo, uxxx şikir ji xwêdê ra! Ûûxxx ji xwedêra şikir. Destê te saxbe..! Ûyy, ûff qomitanêmin

# TABLO V

**Li meydanê maseyek. Çend îşkencecî, lêdanvan. Muhsîn di revê da hatîye girtine, çavgirtî di nav xweydan û xwînê de ifada wî tê sitendinê.**

Serleşker – Ev çi mêranî!? Ji hepsê birevin he.. Bê derketina laşê te, tê ji vê derê derêyi he?!! Nav?

Muhsîn – Îbrahim Şenol.

Serleşker – Navê bav?

Muhsîn – Reşat.

Serleşker – Navê dê?

Muhsîn – Fatma.

Serleşker – Çih û diroka çêbûnê?

Muhsîn – Rûha, Hilwan, gundê Owacik, 1955.

Serleşker – Kunya kesên bi te re hatibûn girtinê derkete derva. Hemû derewin hê diparêsî? Hê jî navê te Îbrahîm Şenol e?

Muhsîn – Ji xwe ez wan naznakim.

Serleşker – He, he. Na lo, na!? Tu wan nazdikî, nasdikî. Qaseke din tê nazbikî. Hişt nivîskar lawo, tiştên hat gotinê te nivisand?

Nivîskar – Bellê.

Serleşker – Derew û rewşa te jî hindik maye. Ew ê derbikeve derva. Ka bêje: Kî li derva û li hundir alî te kir; kîne?

Muhsîn – Ne li derva, ne li hundir kesekî alî min nekir. Min tenê kir.

Serleşker – Binivîse! Bi serê xwe kirîye! Ûlan, ûlan derew nebêje, qambocîk. Bi vê bejna xwe tê dewleta Tirk bixapînî?! Ger rastîyê nebêjî; ew ê qasekê dinê mirîyê te ji vê derê, der bikeve...

Muhsîn – Min dikarin.

Serleşker – Ji bo çi tu revîyayî? Çima?

Muhsîn – Li derva çar birayên min, xwişk û dêkamina jinebî heye. Ez mecbûrim li wan birênim. Xeyn vê bê sûçim, bê sabiqa me. Û hinbûyê hepsê nînim. Ji van sedeman ez revîyame.

Serleşker – Binivîse: hînê hepsê nebûye; way way. Beranê dayka xwe. Tê jî hînbibî, netirse. An tê kurm bigrî, pûç bibî û bicihimî, an jî tê bibî zilam. Rêyeka din jî tuneye.

Ha, temam ne? Ka rake vî kaxizî, rake vê qelemê, ev cîyê nişandidim îmza xwe bavêjê, dawîyê tilîka xwe...

Muhsîn – Piştî ez bixwînim...

Serleşker – Ji me bawernakî ne, ka dinya çewaye bibîne. Hah wilo hah, ha, bixwînim ne! Xweş navêjîyê ji dibe, emê ji dilva te va bavêjin. Xayinên welat ji me bawernakim. Pûşt! Ka tê bibînî, Ûla qerdîyan!?

– Emirke qomitanêmin.

Serleşker – Vî bavêjin hucra serşoyê, qata bin, ya hejmara 3 ya.

– Emrke qomitanêmin.

Serleşker – Emê qaseke din hev bibînin, ka dinya çewaye.

**Qerdîyan di nav lêdan û çêr û gefan de geh lê siwar dibin, geh bi erdê ve dikişînin û davên serşoyê..**

Qerdîyan – Çi serşoyeka xweşik!!!

– Tê baş hînê ajberîyê bibî.

**Piştî qerdîyan dertên diçin, ji qata jorê dengekê xeniqokî, bi dizî, deng li xwarê kir.**

**–Keko.. keko?!**

Muhsîn – Bellê!

– Ez şoreş, dême tu hatî girtin ne?

Muhsîn – Wilo çêbû.

– Haya te jê hebe qolonyalîsta kunya te kifş kirine. Tê peyvandinê, haya te ji te hebe.

Muhsîn – Di gumana min da bû, tişt nabe. Bi biryarî, tekoşin û berxwedan berdewame.

– Bellê.

## TABLO VI

**Cîhê hingavtin û pirsê. Pîsîya avşoyê herikandîye eywanê. Serleşker tegmen û lêdanvan û Hesen lê dimînin.**

Serleşker – Hesen, em naxwazim zêdetir hingavtin li te bikin. Dilê me dişewite!! xortekî mîna şêrî. Evder ne cîyê te ye! Heyfa te hema, dê û bavê xwe bide berçavê xwe... Ez bi te dêşêm. Bi vî awayî ku here tê bimrî!? Tu sebeb tune ku xwe veşêrî. Derheqê te de gellek delîl hene. Hêjî têne pirskirin û delîl têne livandinê. Di nêz de ewê her tişt derbikeve derva. Di nav vê rêxistina parvekar de cîhkî pêwist digrî. Rewşeka wuha heye, di pêş de ewê her tişt ronahî bibe. Lê mêze ez çi dibêjim. Me zêde ne gewgirîne. Xwe ji nexe tengasîyê. Bi me ra lihev were. Ji me ra bêje. Ê dî ji mera bihêle; em li benda gotinê tene! Xeberde! Haydê wilo neke. Te anî wê qeysê, wa hindik maye ku ez xwe bavêjime lingê te. Mêze va ez gellek ji te bi emrim. Bi hindikî be jî dibî ku vî qedrî tu bigrî. Ma ne wilo ye?

Hesen – Tu tiştekê ez bidme we tune ye.

Serleşker – Ez soz û bextê mêranîyê didim te ku, em tu tiştek ji te nakin û nadin kirinê jî. Dixwazî bersîv ji pirsên min re bide. Abdullah Öcalan li welate? An li dervayî welate?



Hesen – Nizanim.

Serleşker – Ha keremke çixare bikşîne.

Hesen – Nakşînim.

Serleşker – Wê gavê tu dikarî bêjî; li nav welat û derî welat têkilîya PKK bi kîjan rêxistinan û heta çi qeysî heye? Di nav rêxistinê de navê kê berpirsîyar dikarî bidî. Kesekê tu nasdikî, an jî navê wî te bihîstibe jî dibe: mesela Şahin Dönmez...

Hesen – Kesekê naznakim û ez nizanim.

Serleşker – An jî niha yek kesekê di hepsê de, an jî yekê ku ji berê ve te wî nazkiribe...

Hesen – Wun bele-sebep pirsan ji min dipirsin. Tu tiştekê nizanim.

Serleşker – Mêze Hesen! Bi her awayî berpirsîyarî dane destê min. Em biryar didine mirov; biryarê bidarvexistinê didine mirov. Lê danaleqînin û ji vê derê em dişinin cem dê û bavê wî. Lê te dî ku dadgeh biryar neda. Ceza nedayê. Em li vê derê ceza didinê. Ew kesê em bixwazin, emê li vê bikujin. Tu kesek ji min; ji me hesab hapirse. Lewra ev di destê min da ye. Ji xwe ez ne girêdayê "Qolordîmolordîya" me jî. Tayîna min rast birast ji Anqerê hatiye vêderê. Xeyn vê, di sala 1974an de li Kibris'ê ji min eskerî kirîye. Ez li wê ji serleşkerbûm. Ez ji kûrmayê pêştir kesî jî nabînim. Tiştên tu bêjî, ji min, ji te û ji kûrmayê pêştir tu kes pê nahise. Dibî ku em li hev û dû bikin. Tu kes vê nabihîze. Dernakeve derva, piştî demekê di mina bêsûçî, emê te berdin derva jî.. Hetta dikarî têkilîyî bi me ra bikî. Hetta emrê te hebe hemû îmkanan ji te ra emê bikemilînin. Heyfe emrê xwe pûç neke; tu hê xortî. Ji xwe Rêxistin jî qedîya!? Hil-

weşîya! Çend kes mane ew jî ha hatin girtinê ha hatin girtinê!? Were li ser serê me nebe donkîşot!? Tiştên em dixwazin were bide me û xelas bibe. A niha jî bêje erê; ezê te bişînim qawîşeka serbixwe. Dawiyê ji emê bipeyvin.

**Hesen** – Ji wa tirê ez tişna zanim. Wun xwe dixapînin. Wun hestîyên min jî hûr bikin, ji xwe we tişt ne hiştîye jî. Tu tişt bi dest we nakeve. Wun dixwazin niha bikujin, ez ji mirinê natirsim.

**Serleşker** – Ezê te û hina bînime hafa hev...

**Hesen** – Natirsim, dixwazî a niha jî...

**Serleşker** – Himmm! (Ji nişka va sejderbê tê dixê cênîkê Hesen) Tê xeberdî? Tenê gotinekê., haydê!?

**Hesen** – Çima disekinî, tilîyê bikşine?!

**Ku dibîne mûkên Hesen jî nalibitin, kor û poşman, serxwar sejderba xwe dadixe qewlikê wê û;**

**Serleşker** – Ez te hema bi neqlekî nakujim. Bi kişandineka zirav, hêdî-hêdî. Mirin ji te ra xelasîye. Tê hêdî-hêdî biheli, li ber çavên min. Wê gavê ezê sifra araqê bixemlînim û tê bi terpîtî û bi vî awayî ezê te bidar de vebikim, bihejînim, tê gihîştî?

**Hesen** – Tu jî dawîya Hitler, Şah, Somoza bide berçavên xwe...

**Serleşker** – Û emê hê bêtir binin serê parvekar û qominîstan, te famkir ûlan?

**Hesen** – Sûç-bêşûç ji xwe vê yekê wun dikin.

**Serleşker** – Emê bikin û em dikin; emê li te jî bikin. Ka bêje: bi dizî li hundir tevgera berxwedara sazdikî ne? Hemberî kî? Li hember me ne? Lê, emê xweziyan di dilê we de bihêlin. Ûla-ûla deme wunê dewleta Kurda ava bikin ne? Çi Kurd; çi Kurdistan e? Ji Tirkan pêştir kî hene li ser vî erdî? Me koka we birrî û emê hêji bibirin. Em vî welatî bidestê tu kesî ra bernadin. Ûla ji idolojîya Atatirk mezintir çi îdolojî heye. Haydê avakin, ka wunê çewa Kurdistan'ê avakin? Şêx Seît, 1938 Dersîm'ê jibir nekin! Emê we mîna goştê hûrkirî, hûrhûr bikin. Ka te ji mêranîyê bixînim tu bibîne.

**Lingê wî pêşîyê girê de (îşkencekar dijwar dest pêdike. Lingê wî girê didin. pizmar li lingê wî didin, dawîyê wî datînin, rast didine seknandinê. Ji cîyê destavapiçûk ve girê didin, kindirê daleqandî hêdî-hêdî dikşînin. Hesen ber bi jorê ve bilind dibe. Ta serê pêşîyên lingê xwe. Ji êşê hatîye ber qeysa bêhişîyê. Serleşker di nava pirs û ciran de nêzî Hesen dibe û wî bi ser tilîyên lingan ve dav dide û dike qêrîn.**

– Pêl paniya bike. Pêl panîyê xwe bike.

**Di vê rewşê de Hesen bê hiş bi werîs va dimîne.**

**Serleşker hêrsa wî neşikîya ye. Mîna gurê Sebatê çavsor:**

– Wî hildin, wî hildin.. dîsa, dîsa.

# TABLO VII

**Qerdîyan** – Fermo qomitanêmin, girtîyê we dixwesta.

**Sawcî** – Temam, derkev derva.

Were Muhsîn, rûnê li vê derê. Me gotibû ku emê li te bipirsin. Çima te vê leystikê li me leyîst? Ji bo bersîva pirsan, tu serbestî, çewa bixwazî wilo bersîv bide. Çima te di nav tevgereka wiha de cîh girt? Amaca we çîye? We çi daye pêşîya xwe?

**Muhsîn** – Berî peyvê dixwazim vê kifş bikim ku; ji serxwebûn û azadîyê bi rûmettir tu tiştek nîne.

**Sawcî** – Belê.

**Muhsîn** – Kurdistan, welatekî qolonî ye. Hem jî qolonîya kevnare ye li ser Kurdistan'ê.

**Sawcî**- Ev çîye; ev çi gotine? Ma tiştên wilo jî hene? Çewa ketîye bindestîyê; çewa vê dibêjî?

**Muhsîn** – Bisekne, ezê bêjim. Bellê, gelê Kurdistan'ê jî mîna gellek gel'an, gel e. Û ji dîrokê ve di gellek pêvajoyan de bihurîye û heta rojên me hatîye. Çewa ku keda însan zêde û kêrhatî bû, hêzên ne kedkar destavêtin keda zêdeve, bindestîya mirovî û gelan û dema kedxwarîyê vebû. Bi dîroka civaka çînî ve hêzên serdest destikên serdestî û pêkanînên kedxwarinê afirandine.

Gelê Kurdistan'ê ji Hind û Awrûpî ye û B.M. salên 100î de li hêlên gola Wan'ê, û bahra Hezarê li axa Mezrabota bicîh bûne. Û vê derê kirine welatê xwe. Li hember împaratorîya Asûr, bi hevkarî û piştgirtina gelên Rojhelata-Navîn ve şerrekê dirêj domandine û B.M. 612an de vê sazûmanê hilweşandine. Di vê pêvajoyê de, gelê Kurd digihîje rêyeka vekirî û xwe di vê dema serbixwe de dikemiline. Di alî aborî, çandî, sinet û sazûmanîyê de pêşketinan pêktîne. Bi B.M. 550î de ji alî Persan em dibînin ku sazûmana Med tê hilweşandinê. Ji xeyni vê, dem bi dem mîna dewleta MERWANÎ, B.M. 900-1000î de, car-bicar di gellek alîyan de pêşde diçe. B.M. sedsala XIan de em dibînin ku qewmeke siwarî, ji Asya'yê, ku bi talanbazîyê debara xwe dimeşîne, koçberî dijî, zerpbaz û qetliamkar û hêzeka hov em dibînin ku tê Anadolê. Yanî em qewmên Tirk dibînin. Ev êrîşên nuh, li hember rewşa cihgirtî, aborî û civata pêşketîya Kurd'a xwe nagirin. Lê, ev êrîş demek dirêj û li ser hev didomin. Ev hêza ku ne kedkare - Jiyana wan ku li ser êrîş û talanê pergal girtîye hemberê gelê Kurdistan'ê dibine bendeke dijwar û li ser gelên hêlê dibin darê zerp û qetliam û talanê.

**Sawcî** – Tu vana ji ku dizanî?

**Muhsîn** – Bi gellek bişkaftinên ilmî û danezanan.

**Sawcî** – Bellê.

*(Dûmahîk heye)*

# QONAXA DAWÎYA XWESİPARÎYÊ . . .

(Destpêk di rûpelê 24an de ye)

dike. Emperializm, bona mayîna hebûna xwe, bona jîngarî ajotina xwe, Rojhelata Navîn pir giring diderivêne. Mîna Libnanê tê dîtin, bi navê "hêza aşîtî" êrîşên xwe rastûrast dajo. Mîna li êrîşa ser Kurdistana Başûr tê dîtin, bi destê nokerên xwe, qomplo hwd. êrîşan birêdixe. Her babet êrîşên bi her teqtîq jîne de pêk têne. Ji hêlekî dijwarî vana çak dike, ji hêla dî, bona bikaribe pêşketinan biqulibêne ser maf û doza xwe, her babet leyîstokên veşartî û nemirovî sazî dike, dakû nav tevgerên hîm dibin de, meylên xwesipar germ û zixtbike, û bi destê van hêzan planên xwe bihilmîne û rêya helkirina çarawara şoreşger bixitimêne. Demajoya heremê de tê jîyan, ger bo emperializm û paşverûkatiya xweyîcîh, ger ji bo sosyalîzm û hêzên gelan, mafê jîngariyê tê ceribandinê. zelale ku, emperyalîzm û paşverûkên xweyîcîh, hazirî û amadekariyên xwe, bi yek gav li ser vê riknê pêktênin, êriş û qomployên hov û xwînxwar pêşdixin. Vêna, ji ber ku hêzên şoreşger û radîqal hêj tenikin û kêmasiyên wan hene, bêtirs dikarin birêbixin.

Nexasim, ji ber vê rastîyê, li hemberê êrîşên emperializmê divê li welatan û gelemperiya xopanê, enîyên şoreşger yên bihîm û zexm çap bibin. Beyî vê, tirsandina emperializmê nerêdare. Herweha çîn cilên li serxwe kiri bûn, lê ne yên wan bûn, vêca derdixin û davêjin, bi kesbûna xwe a rast û tazî xwe pêşkêşî temaşê dikin. Ev ûşt û rewş, bingeheke baş bo bizav û livbazîya xeta berxwedanê tênê ronahîyê. Xwesiparî û reformîstî, mîna hînkera Filistîn de tê şopandin, hişk lihevhatin û bihevrexebatdarî, bi emperializmê re sazî dike û eşkeretî xwe dighîjîne qonaxa bêbextî û îxanetê. Nuha, seranseriya pirsgirêkê ev e; hêzên berxwedanê wê bikaribin ji vê rewşa, tûj û zelalbûyî mafên xwe re fêkî bikşênin, an ne. Ango divêt ev hêz gavekê talî bê avêtin de, bi serkeftî xwe ji rewşê derxênin rojê. Emperializm hemû qozên xwe di Rojhaleta Navîn de, da leyîstandin, an jî rastûrast leyîst. Piştî plana Reagan û polîtîkên din ketin zikakên alozî, tengasî û bêçarawarîyê, pergal û pirsgirêkên sîstemî behtir nexweş ketin û birîndar bûn. Rewşa jîngar a heremê, rê nade bi azînên reformîst û aşîtîkar pirsgirêk bên halkirin, jê re karlêkirî nasî nake. Bona dîtina vê rastîyê, meyzekirina ser Filistîn û Kurdistan bese. Ger mirov li van herdû welatan hinek kûr temaşe bike, dikare bi hêsanî rastî cihde bişopîne.

---

## "Ez dilxwazekî PKK . . ."

(Destpêk di rûpelê 15an de ye)

destavêtin bûkamin û kêfa xwe pê anîn." Kal ji alîkî ve dipeyivî, ji alî din ve li rûyê xwe dida û digot *"ez naxwazim bijîm, dixwazim bimrim."*

Roj, di bin zerp û hingavtinan de derbas dibûn, jîyan bêdebar bû. Yê eşkere nedikirin, an yê tişt li ser wan nedihate îspatkirin, berdidan. Yê bîryarê berdanê diderheq wan de dihat dayîn, navê wan dixwendin, lê ji me re digotin *"xatiran ji hevalên xwe bixwazin, derheq wî de biryarê bidarvekirinê hatîye sitandin, emê wî bibin bidarvekin."* Hinek hogirên me bi darê zorê diçûn, hinek jî bi serbilindî, bi mêranî diçûn. Em paşî pê hisiyan ku ev leyistok e. Armanc dîsa çavtirsandina psikolojîk û bergirtina berxwedanê bû.

Dema min berdan, vî tiştî ji min re jî gotin. Dema min berdan, timî sancû di zikêmin de bû. Çûm ser hekîmekî. Hekîm got *"gurçîkê te idap girtine."* Got ji serma û hingavtinê ye. Min got raporekê bide min, lê wî got *"ev ne di destê min de ye, nikarim"*.

Çend meh di navde derbas nebû car din min girtin. Vê carê ez rojekê girtî mam. Piştî hinek lêdan li min kirin, min berdan. Êdî her serê pênc-şeş rojan carekê min digirtin. Lê weke berê min domdirêj girtî nedihiştin. Ev yek ta sala 1981ê berdewam kir. Cara dawî di sala 1983an de min girtin...

Dîsa dema bi ser gund ve gi[illegible]n, piştî bi hemû gundîyan re li min jî dan û hingavtin, bi çavtirsandinê gotin; *"tu bi rewşa Ruhayê zanî"* û min berdan.

- Bimre Cunta Faşîste Kedxwar!
- Bijî Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan!

Dilxwazekî PKK

---

## Berî civîna civata Awrûpî . . .

(Destpêk di rûpelê 19an de ye)

emperialîstên Awrûpî, bingeha demokrasîyê bi cih girtina "Dogru Yol" û "SODEP" hilbijartinan de, diderivênin. Ev rastî şanî me dide, ku ev liberhevdan û dubendî ser kijan riknî ne. Tiştê tê parastin û palandin, îro sazûman destexwe digre komek bihevrexebatdar, mejindina yên weke xwe û girsên gel de, behtir rê dayîn bo vebirîya gelê me ye. Bûna vê yekê dixwazin sazûmanê de xwedî peyv û gotin bibin. Herweha tê dîtin, demokrasîya ser disekinin ev e ku, hêzên emperialîst ji talanî bikaribên par bigrine û behtir gaf kirine. Ango ev "şêrînî" tenê ji hin hêlwestên burjuwazîya yekdest newê xwarin, lê "wekhev" parbûn tê xwestin. Sedema emperialîstên Awrûpî ser Tirkîye hewqas diminin ev e. Tewrê wan ne parastina mafên mirovane û nikarê bibejî.

Mîna me li jor jî dîyar kir, pirsgirêk îro piştgirtina tevgera gelên me ye an jî a cunta ye. Ji ber ku mafên mirovanî jî alîyên wan bixwe tên perçiqandin, û bilî baweriyên wan bo parastina demokrasîyê, îro li Tirkîye faşîzm gav bi gav bingehsazî bûye. Ne tenê li hemberê gelên Tirkîye û Kurdistanê, li hemberê gelên heremê, hazirîyên herbê heye. Ev sazûman, ji hêla hêzên emperialîst tê kemilandin, sedarsed alîkarî digre û bi vî awayî amadekarîya xwe berûpêş dike. Dema mirov leza pêşketinên xopanê de jî berçavî bêne, bizava hêzên demokratik yên Awrûpa bo pîşange û bîrabirînê cunta, pir giring û pêwîst e. Şerê li hember dîktatorîya faşîst ji van hêzan alîkarî bigre, wê dijwartir bikaribe bê ajotin.

---

## Çima rojîya Mirinê . . .

(Destpêk di rûpelê 4an de ye)

pergal û rengan xwe ji bo gihiştina vê armancê kar dike. Û di vî alî de gavên ber bi şerê gelî ve hatîye avêtinê, dixwaze tunebike, ji holê rabike. Ji bo vê pêkanînê ji êrişên hêlên tixûb didomîne, hêl û gundên stratejî avadike, ji bo hevgirtina şoreşgeran û gel ji hev bipejirine, destikan dixebitîne. Ku di alîyên vê armanc û xebatên xwe da pêşverûkên hêlê û emperialîst piştgirtîyên wî re û bi hevkarîya "hêza çeleq" ev yek gihîştîye qeysa bilindî û şerê vekirî. Ku cunta li hêlên gundan karbûna qirkirina pêktîne. Ji alîkî ve di girtixanan de kuştina şoreşgeran, di alî din da jî li hêlên welat zerpo û êrîşa xwe li ser gel dijwartir dike. Ku tevger û tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistanê tune bike.

Hêsîrên şer bi vê berxwedana mirina rojîyê, pêkanîn û êrîşbazîya dijminê qolonîalist armanckirine ku daxûyanê gelên cîhanê bikin. Ew ji bo jîyana gel û tekoşînê jîyana xwe bizanebûnê hember dijwarîyên qolonîalîstan danîne holê û li hember vê armanca xwînrij rawestiya ne.

- Ji hêla din ve, berxwedana rojîya mirinê, berxwedana girtingeha leşkerî ya Dîyarbekir bûye domandanê berxwedanên girtixanên Tirkîyê ku di 7ê Tirmehê de destpêbûn û neticeka berbiçav bi destnexistine, bi vê berxwedana xwedî taybetên bi hêz, armancên cuntayê ku li ser girtixanên Tirkîyê dixwaze pêk bîne hember wan aramancan jî berxwedanê bilindkiriye.

# BANG

Em, rencgahên (zindanên) mêtingeran de agirê berxwedan û berrabûnê pêlûgeş kirên, ɔi xwîna KAWA yê hemdemî MAZLUM DOĞAN û rêhevalên wî; bûye malê dîrok û mirovatiyê, ber bi pîrozbayîya NEWROZ'ek nûh ve diçin.

Hêzkesiya pêşenga gelê me de, dij zînatê, ala serkeftina berrabûnê damizandên gelên Rojhelata-Navîn; roja 21 ê Adar'ê, bili sedsalên derbasbûyî, ger bin nir û qeydên kedxwaran de be ji, hersal agirê berxwedanê ji nûh ve de dager dikin; û cilsa vê rojê ser bandavên çiyan bi navê cejna NEWROZ, tê pîrozkirin.

Domana sedsalan bin pîkolî û kedmijandina bêsînor, hatî girtê gelê me, di rojeke bivî babetî, dilxwaziya xwe bo yekîtî, tekoşîn û berxwedanê yekcardin berbizman dike. Vê rojê, hersal rêhaceta ji nûhve de za û jînbûne dike. Bêyî pêşîya sitemkariyê situxwarkirin, giyana (rûhê) berxwedana hêza Mediya û lehengê wê KAWA jîngar dikê gelê me, hersal bi tuj û dijwarkirina gir û hêrsa xwe li dij mêtingeriyê, vê rojê pîrozin dike.

Piştî tekoşîna rizgariya Kurdistan giha qonaxên nûjen pêde, bi têdayîkî rûmetîr xemiliye cejna NEWROZ; xwe dirêjî MAZLUM DOĞAN'an kir, ku bo serxwebûn û azadiyê, zindanên mêtingeran de, hemberê zilm û zordariyên çavsor, ser bingeha berxwedana bêhempa, peltên agira berrabûnê dadane. Newroz, ji ber vê sedemê, tekoşîna dîroka gelê me de, bûye sadirê nîşanek nûh a xwebûnê.

Pay tariya pêvajoya qurna salan, bi rêya xogirên çarekdin jîn kirinê, bi têdayîkî hêja hîm bûye serpahtiya berxwedana me Newroz: li dij mêtingeran, paşveçûyên xweyîcih û li hemberê dîtinên ji her rengî yên reformîstên xwesipar û xwedestdar, bûye giyana berxwedana gelê Kurdistan ku enişka tunebûna netewî de bû, bin rêberiya proletarya tê ajotin bi tekoşîna rizgariya netewî cihê xwe girtiye û bin berpirsiyariya rastî, bona wê şer dixwazê, bi rûmetîkî hemdemî-netewî bûye warê dîrokê.

Ji dema bin pêşenga proletarya tevgera me a rizgariya netewî afiriye virde, qestî hebûna gelê me dijwartir dikên mêtingerên Tirk, her babet êriş û vebiriyên xwe û planên tunekirina gelê me derxistne merhelên bilindtirin, bi azinên nenasêhemdemî û hovber bi sedan mîlîtanên şoreşger kuştine û xwestine bi vî awayî zexma berxwedana gelê me bişkênin. Belem, dijî va bikaraninan hundurê welatte, ser baniyên çiyan, li beriyan, di rûreşiya mirovatî rencgahên faşîst de, ala berxwedanê berbijor bûye û bili hundakirina jiyana keleş û mêrxasên gel, mêtinger ji aliyê rêzanî (siyasî) de, hatine binkeftin kirin.

Dijminê dît ku tekoşîna me a rizgariya netewî bi rewşekî hîm û hêz ji nûh ve de agir girt, bi tirs êrişî wir û vir dike. Ger ji hêla neyar û hevalbendên wî yên derveyî hêzên emperyalîst, ger ji ji hêla bi wan re xebatamadekarên burjuvên piçûk yên reformîst, hilweşandina tevgera proletarya tê xwestin. Li dij planên wan, yekîtî û piştgirtî, bêaxaf bûye armanca hewce. Ev dem, demeke ku li hember dijmin li dora tevgera proletarya mîna yek-kulmê em xwe bicivînine. Em bona, piştgirtina tevgera serxwebûn û azadiyê a li welat tê ajotin, bi cih bênin, bona yekîtî di nav welatperwerên Kurdistan bingeh bikin û bona şiyariya wanan zelaltir bikin, daxwaza me ye ku em Newroz'ê bi hevre pîrozbayî bikin.

Bona vê yekê, şevên Newroz'ên sazibûne de giringe em agirê berrabûnê carek din pêlûgeş bikin!
Newroz bi xwîna Mazlum Doğan'an, Ferhat Kurtay'an û hogirên din avibûye, hewceye em wê biqulbênên hacetên yekîtiyê, dilsoziyê, hevalbendîyê û tekoşînê!
Divê em, cejna xwe Newroz, di şevên berûpêş bibin de, bi hevre pîroz bikin, dengê xwe a berxwedanê carek din qêrîn bikin!

**● KAWA YÊ HEMDEMÎ MAZLUM DOĞAN Û HEVALÊN WÎ YÊN RONAKREWAN BÊ MİRİNİN!**

**● BİJÎ SERPAHTÎYA BERXWEDANA ME CEJNA NEWROZ!**

**SERXWEBÛN**

